Demokrasî bo Îranê
Hejmar: 1 Novembera 2003

# agirî

Otonomî bo Kurdistanê
Sermaweza 1382'e Rojî

Rojnameyeke siyasî û çandî ye
Partiya Demokrata Kurdistana Îranê diweşîne

www.arsivakurd.org

## Ji çiyayê Agirî ve ber bi Rojnameya Agirî

Bi xweşî ve bi agehdariya hemû alîyekê digehînin ku Partiya Demokrata Kurdistana Îranê ji ber dest daye ku rojnameyeke mehane ya siyasî, çandî bi navê Agirî û bi zaraveya Kurmancî ya jorîn û bi tîpên latînî biweşîne.

Merema Partiya Demokrat ji vê biryarê, ji aliyekê nasandina her çi qas zaftire bizava rizgarîxwaze gelê Kurd û PDK Îranê bi vê para xelkê Kurdistanê ku bi zaraveya Kurmancî ya jorîn dipeyv in û xwendin û nivîsandina wan bi tîpên latînî ye. Ji aliyek din û di çarçoveya siyaseta çandî ye xwe de bo pûte û giringîdan bi pêşveçûna ziman û çanda Kurdî û pêşvebirina astê rewşenbîriya vê parê ji xelkê Kurdistanê, rojnameya Agirî pêşkêşî evîndarên Azadî û rojnamevaniya Kurdî diket.

Rojnameya Agirî bi derçûna yekem hejmara xwe tevlî karwanê Rojnamevanî û rewşenbîriya Kurdî dibe û nobere û berhemên xwe di hemberî xwendevanên xwe de radêxe û dibîte hegera zaftir nasandina **dîroka** dûr û nêzî ya xebata rizgarîxwaziya gelê me.

Dûr nine ku ev rojnameye li yekem gava xwe de sawa bête berçavê xwendevanan û bi nigeranî û li rûyê hest û sehê ve bête nêrîn. Lê bi erxayîn bûn bi wan armancên ku rojnama Agirî girtiye pêşiya xwe û li çarçoveya wan siyasetên Partiya Demokrat de ku mîna çiyayê Agirî hembêza xwe bo xemxur û xebatkarên rêya azadî û rewşenbiriyê vekirî hêlaye, ev rojnameye vê bikare mîna pira lev girêdan û hevxebatiya navbera

**Doma wê 6**

## Birêz Ebdula Hesenzade, Sekreterê Giştiyê PDK Îranê di hevpeyvîneke tevî Agirî de



**Xwendevanên hêja, Ev hevpeyvîna jêrîn bi şane bûn û kêfxweşiya weşana yekem hejmara Agirî ji aliyê desteya nivîskarên Agirî ve tevî rêzdar Ebdula Hesenzade Sekreterê Giştiyê PDK Îranê hatiye pêk anîn, em bala ve bo pirs û bersivên giringe wê hevpeyvîn radikêşîn:**

**Doma wê 2**

## Nigeraniya Komara Islamî derheq avabûna sîstemeke Federalî di Îraqê de

✍:Zanyar




Rejîma Komara Islamî ya Îranê ji destpêka êrîşa hevalbendan bi serokatiya Emerîka bo ser rejîma Îraqê bi eşkere dijberiya xwe tevî vê pirsê ragehand. Hetanî bi terzekê kete beravanî kirin li rijîma pêşî ya Îraqê.

Piştî vê êrîşê û hiloşîna rijîma Sedam Husên li Îraqê jî berdewam li encamên nebaşe vê êrîşê axiftiye û bi serwekî kevirê parastin û berevanî kirin ji xelkê Îraqê li sîngê xwe dida û daxwazkarê spartina Îraqê bi Îraqiyan bûye.

Niha ku Civata Deshilatdare Îraqê bi hêvî ye ku terz û pêça sîstema pêşeroja hikûmeta Îraqê bide xuya kirin.

**Doma wê 4**

## "Îran qurbaniyê terorîzmê"

✍: Kurmanc Hakkî

Êrîşa ser Navenda Cîhaniye Bazirganî (WTC) gişt cîhan hejand. Piştî wê êrîşa herî mezine terorîstiye serdema me, şer di gelek cihên dine cîhanê dom dike. Di encama şerê dijî terorê de 2 dewletên kevnar û dîktator (Taliban û Rejima Îraqê) hatine hilweşandin û di şûna van de hikûmetên nû ava dibin, ku armanca wana pêk anîna dewletên demokratîk li ser bingeha mafê mirov û viyana gelên wan welatanaye. Avedan kirin û damezrandina sîstemeka demokratîk – ku hevcehiya rojeve Rojhelata Navîn û cîhana Islamê ye - li Îraqê jî û li Efxanistanê jî karek giran û erkek qurse ku hevce bi gavên bivêrane û piragmatîk e. Lewma alîkariya civaka navnetewî wek hevceyiyek mîna nan û av tête holê.

Şerê dijî terorîsmê hina nekariye terorîzmê ji holê

**Doma wê 10**





***Ebdula Hesenzade: "Îro rojê hemû aliyek di hundire welat û Cîhana derve kakila vê rejîmê wekî ku heye nas dikin û hemû jî têgihîştine ku hetanî ev sîstema li ser kar be, ne xelkê Îranê rûyê azadî û demokrasî û edalata civakî dibînin û ne aştî û tebayî di nav welatên herêmê de cihgir dibe û ne terorîzm wekî kirêttirîn diyariya wî çaxî di asta cîhanê de reh û rîşalê wê tê derêxistin"***



***Ebdula Hesenzade, Sekreterê Giştiye PDK Îranê***

**Agirî: Her wekî hûn agehdar in eve yekem care ku Partiya Demokrat rojnameyekê bi zaraveya Kurmancî a jorîn û bi tîpên latînî diweşîne. Pirsa me ewe ye ku tu armanc û merema Partiya Demokart ji weşana vê rojnamê çawa dinirxînî?**

**Ebbdula Hesenzade:** Li berahiyê de min pê xweşe sexmeratî weşana Agirî pîrozbahiyê ji we desteya nivîskaran, li xebatkarên partiyê û li xwendevanên vê rojnama nû bikim û hêviya berdewamî û xizmeta bi mifah bo we û rojnamê daxwaz bikim. Ger bême ser bersiva pirsyarê, dibe bêjim: Biryara qirarê derxistina rojnameyekê bi tîpên latînî û bi devoka Kurmanciya jorîn, berî her tiştekê ji rastiyeke tale dîroka Kurd û kawdana nihaye Kurdistanê ve çavkaniyê digire. Ev rastiya tal ewa ye ku ji aliyê deshilatdarên xwedî hikim li deverê de, bêy wê ku pirsekê ji civatên xelkê Kurdistanê bikin, neteweya Kurd û welatê vî bi ser çend welatan de parve kirine û di wan welatan da jî neteweyên cuda cuda xwedî emr û ferman in û zimanên cur bi cur weke zimanên fermiye welat hatine nasîn. Ji wêne jî wegerin ku Kurdan nekariye di xwendingehê da bi zimanê zikmakiye (dayîkî) xwe bixwînin, ev zimanê ku xwendine jî li hemû welatan de bi yek Elf û bê nebûye: Li Îranê Farisî, bi xetê Erebî, li Tirkiyê Tirkî, bi xetê Latînî, li Îraqê û Sûriyê Erebî, bi xetê Erebî û li Yekîtiya Soviyetistana berê bi Elf û bê ya Rûsî bûye. Wan wextane da jî ku Kurdan li her yek ji wan welatane da bi qaçax û nîve qaçax helbest û pexşan bi zimanê Kurdî nivîsandine, neçar bûne bi vî Elf û bê yî ku di welat de resm bûye binvîsin.

Ji ber wê ku têkiliya navbera Kurdên perçên Kurdistanê hemû çaxekê ne fermî û zaf caran jî ne mimkin û ser negirtî bûye. Mixabin bo Kurdên pişkên cuda cudaye Kurdistanê çê nebûye ku bi hêsanî ji devoka hevdu tê bighîjin, yan terzeke xetê resm û bav li hemû pişkên Kurdistanê da bixwînin û ev rewşenbîrên ku delîveyeke wisan bo peyda bûye, yan bêjîn karîneke wisan ji xwe şik birine, her tim hejmara wan zor kêm û dikarin bêjîn kêmtir li sedî yek a akinciyên Kurdsiatnê bûye.

Aqibeta wê eva ye ku niho xelkê pişka herî mezine Kurdistanê, yanî Kurdistana Tirkiyê û her wisan Kurdên Sûriyê û Ermenistanê, ne wê terze devoka Kurmanciya jêrîn ku devoka edebyata PDK Îranê jî ye têdigîjin, ne jî nivîsên Kurdî bi xetê Eerbî dixwînin. Diyare bo hemû Partiyeke Kurdistanî û yek ji wan Partiya me girîng e ku xelkê hemû pişkên Kurdistanê banga wê bibîsin û ji siyaset û qirar û ramanên wê pê bihesin. Hetanî niha ev kare carna car bi wergêrandina hindik gotar û daxuyanî û danîna wan li ser malpera Înternetê, yan jî çap û belav kirina wan hatiye cî bi cî kirin. Lê di wê dawiyê de Deftera Siyasî bo wê ku ew kare bi ser û berî û berdewam pêşve biçît, qirar da rojnameyek bi tîpên latînî û devoka Kurmanciya jorîn bête weşandin ku him li ser malperê bihê danîn û hem jî bihê çap kirin û bo part û sazî û bingehên çandî ên Kurdên Kurmance jorîn bihê şandin.

Bi wî awayî hewce ye ev gava hizbê di wê çarçovê de bihê mêze kirin û bi qirarekî stratejîk û heta serî nehête hesibandin. Ji ber ku eyan e çi neteweyeke azad û bextewer, du zimanan bo xwe saz nake û du devokan di rojname û dezgehên ragehandinên giştî da bikar nabe. Li gor wê yekê, dibe daxwaza hemû Kurdekê û cehda hemû Kurdan bo gihîştin bi rojekê bît ku Kurd jî weke hemû ***gelên xudê Pêdayî*** bi yek zimanî bixwîne, bi yek zimanî binivîse.

**Agirî: Mamosta can bi hizr û bawira te Rojnameya Agirî dê bikare çi bandorekê li ser bizava çandî û rewşenbîrî a xelkê Bakurê Kurdistanê dabinêt?**

**Ebdula Hesenzade:** Eger merema pirsê xelkê Bakura Kurdistana Îranê be, ez bawer im derketina wê rojnamê guherîneke mezin pêk nayîne û cihwareke girîng dananêt. Ji ber ku wan niha tevî wêje û edebyata Hizbê hevnasîn hene û nivîsên hizbê bi xetê Erebî û devoka Kurmanciya jêrîn baş dixwînin û fêm dikin. Lê eger merem Bakurê Kurdistanê bi tewawî be ku Kurdên Tirkiyê, Ermenistan û Azerbaycanê jî ji xwe digre, bê şik û guman dê bandorek baş li ser nasandina Partiya Demokrat û xebata xelkê Kurdistana Îranê hebe, ku eve jî deskevteke bi nirx û bihagiran e. Di warê çandî de girêdayî bi qasê serkeftî bûn û pijyayî a zimanê rojnamê ve ye. Her çi qas ji aliyê ziman û rêzman û rênûsê ve serkeftî be û xwendevanan bo aliyê xwe rabikêşe, ev hinde dikare bandorekî baş li ser qasê bilind bûna hişyariya çandî a xwendevanan dabinêt û zêdebarê wê jî nêzîkiya çandî di navbera Kurdên Îranê û pişkên dinêye Kurdistanê de çê biket.

**Agirî: Bi nêrîna te bo wê ku rojnameya Agirî bikaribe bawerî û bala xwendevanan bo aliyê xwe rabikşîne û di nav weşanên Kurdî de cihê xwe peyda bike, hewceye kîjan merc û pirensîpekê wekî *kevirê xîm* ji xwe re bike bingeh?**

**Ebdula Hesenzade:** "Waqibînane" dibêjim ku edebyata PDK Îranê di warê çendayetî û her wisan di warê deranîn û terzê wîrastarî û bi tewawî di warê teknîkî ve ji edebyata çend partiyên Kurdistanê paştir e. Lê her ev edebiyate hindik →

xasmaniyên xwe hene ku bi van tê nasîn û
bûne sedema qedir û hez kirin û hogiriya xwendevanên Kurd. Ji wan xasmaniyan: *Rast bêjî, Ziman paqijî (pakî) û xwe parastin ji dijûn û qisên sivik û buxtan lêdan bi vî û wan û "waqiebîn"î û giranî di qirar û helwestê siyasî de.* Di warê naverok û formê ve zimaneke paqij, zelal û esîle Kurdî, bi kar anîna rênûseke durist û kêm bûna şaşiyên rênûsî û rêzmanî û çapî. Bi xatircemî ve dikarim bêjim ku berçav girtina wan xalên sereke di rojnama Agirî de dikare serkeftina wê rojnamê di rakêşana bala xwendevanên Kurmanc yan Kurmancîxwan de dê misoger bike. Ku wisan e ev pirse girêdayiye bi cehd û livîn û karîna we desteya nivîskarên Agirî ve ye û di wê pêvajoyê de hêviya serkeftinê bo ve daxwaz dikim.

**Agirî: Wekî diyare ev rojnameye zortir bi merema gihandina zanyarî û zelal kirina pirsên cur bi cur û xizmeta çanda Kurdî bo xelkê Bakurê Kurdistanê tê belav kirin. Bo wê çendê ku ev rojnameye di karên xwe de serekftî be, te çi daxwazî, yan rasipartinek ji xwandevanên Agirî bi giştî û xelkê Bakurê Kurdistanê bi xasmanî heye?**

**Ebdula Hesenzade:** Her weşanek bi her zimanekê der bikeve tenê bi kar û xebata nivîskar û kadroyên derxistinê serekftina berçav dest ve naîne. Ku wisane serkeftina rojnameya me ya nû jî tenê di girewa kar û xebata ve da nine û li hindê jî zêdetir girêdayiye bi wê têkiliya ku nivîskar û xwendevanên rojnamê bi hevre girê didet. Lewma hêvîdar im xwendevanên Agirî rojnamê bi ya xwe bizanibin, di vejandin û pêşxistina wê de pişikdar bin, bi çavê kêmasî bûn û afirandin wan mijarên vê bixwînin, her rixnee û pêşniyazek ku bête bîra ve, bê rawestan û bi lez li rêya Fax û Emaîl û Telefon û her rêyeke berdeste din we bigehînine desteya nivîskar û li wê jî zêdetir xwe wekî parek ji desteya rêvebere rojnameyê dabinên û bi şandina gotar û lêkolîn û mijarên zanistî, siyasî, çandî, aborî, civakî û her wisan deng û bas û qewmînên navxweye welat û her mijareke girêdayî bi doza Kurd û xebata rizgarîxwaziya seranserî di Îranê de, rojnama xwe dewlemendtir û balkêştir bikin.

**Agirî: Her wekî tu dizanî, çend roj berî niha nûçeyê ava bûna partiyekê bi navê Partiya Jiyana Azad a Kurdistanê ji Televiziyona MEDYA TV û malperên Înternetî hate belav kirin û dibêjin ev Partiya nû dixwaze di rêya pirojeyeke bi nav "çareseriya demokratîk" ve sîstema deshilatê di Îranê de biguherîne û di cihê vê de sîstemekî demokratîk cihgirtî biket. Bi raya te ava bûna wê Partiyê û dirûşmên vê heta çi qasekê tevî rastiyên civaka Îranê û gelê Kurd li Kurdistana Îranê hev digrin û hûn bi daneberhewa xwe çi pêşerojekê bo vê partiyê pêşbînî dikin?**

**Ebdula Hesenzade:** Me gelek caran gotiye ku eger di welatê me de Demokrasî û azadî cihgir bûn û xebata partî û saziyan bihête holê, em hez dikin bi hezaran gul bipişkivin û di wî halî de jî PDK Îranê him ji reng û him bi bêhna xwe ve bibe şagul û gupika hemû gulan. Niha ku ev azadiya çi nine, her gavekê ku xebatkarên rêya rizgariyê di Kurdistana Îranê de bixwazin Partiyeke din cuda ji wan Partî û saziyane ku hetanî niha xebata siyasî dimeşînin, ava bikin, Partiya Demokrat ne tenê dijber nabe, belku madam ku progremên wan di pêxema gihîştin bi maf û azadiyên xelkê Kurdistana Îranê de be û ji kûratiya civaka Kurdên Îranê ve ra bibin, Hizib amade ye dostatî û hevkariya wan jî biket. Lê mixabin ewa ku di pirsyara ve de navê wê hatiye, berê çi yek ji wan du haletên jorîn nine. Ji ber ku her wekî di daxuyaniya dawî hetanî yekemîn konferansa Bizava Yekîtiya Demokratîk de hatiye, eva ku niha bi navê Partiya Jiyana Azad a Kurdistanê de hatiye ragehandin, deskirdê Bizava Yekîtiya Demokratîk e ku ev jî bi noba xwe deskirdê PKKê yan eger bi navê nû nav bibin: ***KADEK***ê ye.

Mixabin rêberên PKKê tevî wê ceribîna tal jî ku di çend salên bihorî de em şahid bûne, dest ji destêwerdana kar û barên pişkên din ên Kurdistanê ber nadet. Eger caran xwe bi Partiya hemû pişkên Kurdistanê dizanî, niha bo her yek ji perçan Partiyekê ava dike û bi xasmanî bo Kurdistana Îranê hetanî niha çend nav ceribandine, lê serbarê bêencamî û sernekeftina wê jî dîsan dest jê hilnegirtiye. Ez naxwaz im lêre de biçime nav hûrdekariyên pirsgirêkê. Tenê hindê dibêjim ku berevajî nêrîna wan dostane xelkê Kurdistanê gelek hişyar in û gelek zû berê destê wan kesane dixûn in ku bêçine cehdê dikin bi her meremekê be cênişînekê bo PDK çê bikin. Cehd kirina ser negirtiye 4 – 5 salên derbas bûyiye PKKê û kesên dinê rastiya wê gotinê bi başî diselimînin.

**Agirî: Li dawiyê hevpeyvînê de daxwazê ji te dikin ku hinek li ser rewş û kawdana nihaye Îranê û bizava nerazî bûna dijberiya xelkê û qedera Komara Îslamî, bo xwendevanên Agirî re bas bikî?**

**Ebdula Hesenzade:** Komara Îslamiya Îranê di naziktirîn û tengavtirîn qonaxa temenê xwe de derbas dibe. Çi demekê wekî niha di nav civakên xelkê Îranê de bi tenê nemaye û di nav kom û saziyên navneteweyî de jî bê hitbar ne bûye. Îro rojê hemû aliyek di hundirî welat û cîhana derve kakila wê rejîmê wekî heye nas dikin û hemû jî têgihîştine ku hetanî ev sîsteme li ser kar be, ne xelkê Îranê rûyê azadî û demokrasî û edalata civakî dibînin û ne aştî û tebayî di nav welatên herêmê de cihgir dibe û ne terorîzm wekî kirêttirîn mijara wî çaxî di asta cîhanê de reh û rîşalê wê tê derêxistin. Ji ber dê çendê, hevdengiya ranegihandî û qise lê nehatî kirî, li ser hewcehiya hiloşîna Komara Islamî çê bûye û pêşve çûna rûydanan jî bi çi terzekê di qazanca berdevkên rijîmê de nine.

Eyan e ku ewê bi tenê man û ji ber çavên xelkê ketina Komra Islamî qazancê dike, berî hemûyan xelkê Îranê û bizava rizgarîxwazî ya gelên Îranê ye. Bi vî awayî ez pêşerojeke geş û ronahî li pêşiya vê bizavê da dibînim û ji min xuyaye ku gelek pê naçe ku welatê me dê guherînên mezin bi qazanca azadî û demokrasiyê bi xwe ve bibîne.

Eve maye ku ez bêjim bi kêfxweşî ve pêşerojeke ronahî bo neteweya Kurd pêşbînî dikim û xuyanî û nîşane jî vê rastiyê didin xuya kirin ku di pêşerojeke nêzîk de Kurdên hemû pişkên Kurdistanê vê ji guherînên siyasiye herêma Rojhilata Navîn xwedî par dibin û dighîjne mafên berheqe xwe.

**Agirî: Mamosta can, ji aliyê rojnameya Agirî ve ji bo qebûl kirina vê hevpeyvînê em pir sipasê ji te dikin û hêviya temen dirêjî û serkeftinê bo te daxwaz dikin.**

**Ebdula Hesenzade:** Ez jî sipasiya ve dikim û hêviya serkeftinê bo ve dixwaz im.

www.arsivakurd.org

# Nigeraniya Komara Îslamî ya Îranê derheq ava bûna sîstemeke Federalî di Îraqê de

**Zanyar**

Di vê derheqê de bi piraniya dengan sîstema Federalî bo vî welatî pêşniyaz kiriye.

Komara Isalmî, anku rijîmek ku serwekî xwazyarê spartina Îraqê bi destê Îraqiyan e, ketiye dijberî kirin tevî wê pêşniyazê û damezrandina sîstemekî Federalî di Îraqê de bi tiştekî ne baş û kareke ne binecih dizane û di rêyên cur bi cur de cehda dijberî kirinê diket. Eve ku rijîma Komara Îslamî dijberiya ramanên Civata Deshilatdare Îraqê derheq Federal bûna wî welatî diket bi berçav girtina vê çendê ku hem Amerîka û hem pişkek zaf û berbiçav ji welatan ragehandine ku hikûmeta pêşeroja Îraqê û bi giştî ev welate dê bibîte berjengek baş bo hemû deverê dilkutokê girtiye û xofa bûna mînakek wisan li vê deverê de pêşberî deshilata xwe dibîne û ev nigeranî û tirsyanê jî li zaf sefer û hevdîtinên dîplomasiyên rayedarên xwe de aniye rojevê. Komara Îslamî ya Îranê li vê çendê nigeran e ku ava kirina nîzameke Federalî di Îraqê de xwe derbasî cîranên Îraqê û welatên deverê, ev jî bi berçav girtina dê rastiyê ye ku Îran welatekî pirneteweyî û pirol û meseb e, bi awayekî xwezayî bo rijîmeke wiha ku dijî demokrasî û mafên gelên bindest cihê pê xweş bûnê ye.

Bi ava bûna sîstemeke Federalî di Îraqê de bêşik hem gelê Kurdê wî welatî û hem oldarên Şîî ên Îraqê dibine xwediyê deverekî xasmaniye xwe di çarçoveya Îraqeke Federalî de û di rewşeke wisan de zaf ji wan zordarî û bêheqî yên ku dehan sal e derheq bi wan hatine kirin, dê li ser wan bihên hilgirtin û mafên neteweyî û olî û mirovahiya wan bêne bi cih anîn. Ku ev jî tevî kakila dijî demokratîk a Komara Islamî heta li derveyê tuxîbê Îranê jî hev nagirît.

Rijîma Komara Îslamî ku di salên bihorî de di pêvajoya xebata gelê Kurd di Îraqê de bi eşkere têkilîyek tevî hêzên Kurdî yên Îraqê hebûye û xwe bi dilsoj û xemxurê wan nîşan daye. Qet bi vê çendê razî nebûye ku xebata gelê Kurd di Îraqê de bighîje encama dilxwaze wî gelî bo bi cih hatina mafên wan û li piştî vê pêwendiya serwekî û derewînî de tevî çend welatê dine cîranê Îraqê ku her yek ji wan bi ser parek ji neteweya Kurd de




deshilatdariyê dikin û di komplo û pîlan darêtinê de nerawestiyaye û bo bi encam ne gihîştina xebata wan hevrikî û pêşgîrî kiriye. Bi gotinek din heke Komara Islamî di hember rijîma ji navçûye Îraqê de hez ji navçûna hêzên Kurdî yên wî welatî nekiriye, lê bi kiryar çi ji destî hatibe ji bo bi encam negihîştina vê bizava berheq û mafxwaze xelkê Kurdistanê kiriye. Lewma niho di halekê de xwe zevtker û bin pê kerê mafê gelê Kurd û gelên dine zor lêkirî yê Îranê ye. Ji devr û rola ku Kurdên wî welatî di welatê xwe de hene û dê hebin, tengijiye. Devereke Federal ya Kurd di çarçoveya Îraqê de bi xetereke mezin bo ser xwe dizane û eger wekî dibêjin Îraq jî bibîte mînakek bo deverê ku eyan bûna pirsgirêka Kurd û gelên dinê ye Îranê bo ser deshilata îdeolojîk û dîktatoriya ***Welayeta Feqîh*** a xwe bi xeter û tirsek mezin dizane.

Cuda ji pirsgirêka Kurd, Komara Îslamiya Îranê ku xwe bi navê ol û Îslam û Şîî di Îranê de hikmdariyê dike, serwekî dibe kêfxweş be li vê çendê ku ogirê olê Şîî di Îraqê de dibine xwediyê devereke Federal û ev zilm û zordariya ku li rejîma berê ya Îraqê derheq bi wan dihate kirin, li ser wan nemîne. Lê belê, bi kiryar di vê pêwendiyê de jî ketiye dijebrî kirinê û hez bi rewşeke wisan hetanî bo Şîiyên Başûra Îraqê jî naket. Ji ber ku Şîiyên Îraqê di halekê de dibine xwediyê devereka Federal ku ev sîstema Federalî, Kurdên Îraqê jî bi xwe ve digire, tiştek ku tu car bi dilxwaza Komara Islamî nebûye û nabe. Cuda ji vê çendê rêberên Komara Îslamî ya Îranê dixwazin navendên oliye Şîiyên Îranê wek navenda pîroz û esliye tev Şîiyên cîhanê cih bigire û xwe bi rêberê cîhana Şîiyan bidin selmandin. Xwezayî ye heke Şîiyên Îraqê bibine xwediyê devereka Federal di Îraqê de ku ev devere navendên Oliye wek Necef û Kerbela û . . . HWD li xwe ve digire. Bi berçav girtina vê çendê ku ew cihane li berê da navenda mesebê Şîî û binegeha zaf Ayetula û ***"merceên teqlîd"***ên Şîî bûne û hene, careke din rola xwe peyda dikin û bi kiryar navendên mesebî yê Îranê û rêberên Komara Îslamî dikevine qiraxê.

Tiştek ku bo rêberên Komara Îslamî û deshilata olî û mesebiya wan cihê xeter û tirs û nigeraniyê ye. Pirsgirêkeke din di wê pêvajoyê de ku xasmaniya her sîstemeke Federaliye ku berevajî rijîmên dîktator û îdeolojî, civakî ber bi pêş ve çûn û wekhevî û parve kirina deshilatê dibe. Ew jî hindek pîvan û mercên sîyasî,

www.arsivakurd.org

civakî û exlaqî li dîv xwe tîne û bihayên îdeolojî û olî dixe bin xala pirsyarê.

Xwezayî ye ku rewşek wisan tevî deshilatên olî û îdeolojî bi xasmanî tevî bawer pê kirin bi Welayeta Feqîh li hevrikiyek tewaw de bît û bo wan cure hakimyet û deshilatane xetereke mezin dibe. Cuda ji wane Fedralîzm di nefsa xwe de li Nizamîgerî (leşkerî bûn) û mîlîtarîsmê bi dûr e û nizameke wisa kêmtir pişta xwe bi çek û qadxane û silahên cur bi cur ên tevkuj girê dide. Lewma bi mînak danîna Îraqê bo deverê û paşan dûr ketina welatên herêma Rojhilata Navîn ji berêkaniye bo dest gihîştin bi çekên zaftir û hevdemîtir û hebûna hêzên teyare nizamî (leşkerî) êdî rê nadet di vê navberê de, rejîmek wekî Komara Îslamî xwediyê hêza nizamî ya zaf û çek û hewcehên şerên cur bi cur be, û bo dest gihîştin bi çekên tevkuj jî bixebite. Bi xasmanî ku ev rejîme di heyamê temenê xwe de daye eyan kirin ku rijîmeke terorîst, ne berpirsyar û sereberedaŷî û hir û neban bi yasayên pejirandiye navneteweyî û her gav dikare bo welatên cîranên deverê û heta cîhanê jî tirs û nigeraniyê biafirîne. Bi baldan bi hemû ev pirsên giring ku gav hilgirtina Îraqê bo ava kirina nizamekî Federalî ku dibe sebeba guhertinên bingehîn di deverê de, Komara Îslamî ya Îranê bikeve tengasiyê û bi hemû hêz û şiyana xwe bixebite ku, ceribînên niho yên Îraqê tevî ser negirtinê rû bi rû biket. Lê belê tevî wan hemû têkvedan û dijberî kirina vê rejîmê ku wisan tê xuya kirin ku îradeya xelkê Îraqê û civata deshilatdare vî welatî û piştgîrî ya Emerîka û Ewropayê ji vê gavê û pêşve çûna vê pêvajoyê, pîlanên Komara Îslamî û hêzên welatên mîna vê rijîmê dê pûç bibin û xelkê Îraqê dibîte xwediyê nizameke Federalî û deshilateke civakî ku di bin hakimyeta vê nizamê de gelên Îraqê û peyrevên dîn û olên cur bi cur di wekhevî û mafê beramber û edalet û tenahiyê de bijîn.

# Mehkûm kirina kiryarên terorîstî

Roja pêncşemî 29'ê Xezelwera 1382'ya Rojî (2003.11.20 Zayînî), du teqînên mezin li du cihên Bazirganiyê ên pir xulyaqet li bajarê Stenbol a Tirkiyê qewimîn ku bû sedema kuştina 28 kes û birîndar bûna 300 kesên din. Tenê 5 rojan berî vê kiryara terorîstî bû ku bûyereke dine terorîstî di wî bajarî de afirî ku ev jî bû sedema kuştina hejmarek ji kesan û birîndar bûna hejmarek zaftir ji xelkî û zirar û ziyanek zaf û ber bi çav afirand.

Ev cure kiryarên terorîstî ku pitir dibine sebebê kuştin û birîndar bûna xelkê sivîl û bê guneh, heyamek berî niho li Tirkiyê, Îraq û welatên din ên herêmê ku xurtî hatine holê, bûne sebeba kerb û nerehet bûna xelkê seranserê cîhanê û raya giştiye cîhanê û tevî nerazî bûnên xurt u berfireh rûbirû bûye.

PDK Îranê ku gorî û qurbaniyê terorîzma Komara Islamî ya Îranê ye, vê kiryara terorîstî gefek ji bo mirovahiyê û belav bûna vê jî xeterek bo tenahiya canî û maliye xelkên sivîl û bê guneh di wan welatane de dizane û bi tundî şermezar û mehkûm dike.Teror weke kiryarek nebaş li her ciheke cîhanê û bi destê her girûp, dewlet û komekê û li dijberî canê her mirovekê û bi her meremekê ku bihê kirin şermezar û mehkûm e û xebat bi dijî terorîzmê wezîfeya hemû ev welat, Partî û Rêxistina ye ku xwe bi alîgir û berevanê aştî û azadî, ewlekarî û tenahiya xelkê cîhanê dizanin.

Em hêvî dikin ku bi cehdek giştî û girtine bera rêya çareseriyê ji aliyên civakên navneteweyî ev kiryarên hov û xirabkerane bihêne bin bir kirin û nehêl in carek din dubare bibin ku li welatên cur bi cur de canê xelkê sivîl û bê guneh dêxe ber gefê.

**Partiya Demokrata Kurdistan a Îranê**
**1382.08.30'ye Rojî**
**2003.11.21' ye Zayînî**

# Nûçeyên Kurdistanê

## Civîna rayedarên dewletê li bajarê Seqiz

Roja şemiyê 20'ê Xezelwera 1382e rojî (11.11.2003 zayînî), Şivra îdarî ya bajarê Seqiz bi pişikdariya Cemşîdî cêhgirê siyasî yê yekeme Parêzgarê Kurdistanê li Seqizê û her wisan Fermandarê wî bajarî û berpirsyarên îdareyan civînek li dar xistin.

Di wê civînê de berpirsên îdareyên dewletê seba vê çendê ku çima hetanî niha tenê 3-4 kesan xwe bo noneratî di Meclisê de nav nivîs kirine, nerazî bûna xwe eyan kirin.

Di dawiyê de gihîştin vê encamê ku hemû berpirsyar cehd û bizava wan eve be ku xelkê ji bo pişkdarî kirin di hilbijartina pêşeroja Meclisa Şivra Islamî de hay bidin.

**Kamyaran**
## Lêkdana xelkê û hêzên rijîmê li Kamyaranê

Roja 14.08.1382'e Rojî (05.11.2003 Zayînî), otombêla kasibkarekê di nav bajarê Kamyaranê de ji aliyê çend kes ji hêzên leşkeriye rijîmê tê girtin. Her di wî çaxî de xelk li devra wan xir dibe û daxwaza azad kirina otombêlê dikin, ku di encamê de di navbera xelkê û hêzên rijîmê de tevçûn û alozî çê bibe û piştî wê çendê ku şûşeyên otombêla Hêzên Întizamî dişkînin, du kes ji wan (Hêzên Întizamî) jî bi navên Serheng Azadî û Serwan Yawerî tên birîndar kirin. Lê roja paştir rijîm dest bi girtinên ciwanên wî bajarî dike û hetanî dema gehiştina vê nûçeyê 11 kes hatine girtin û şandine girtîgehê.

www.arsivakurd.org

**Doma rûpelê 1**

# Ji çiyayê Agirî ve ber bi rojnameya Agirî

zaravên esîle zimanê şirîne Kurdî û xurtên xebatkare neteweya me, bi alîkariya nivîser û afirandinvanê gelê me di pêxema xizmet bi gel û niştiman da wezîfên xwe bi cih bigehîne û bibe hêvî û baweriya xwendevanên rêzdar û xelkê xebatkare Kurdistanê.

Danana navê Agirî li ser vê rojnamê ji aliyê Partiya Demokrat ve dizivire bo çend sedemên dîrokî ku ji aliyekê çiyayê Agirî di warê dîroka siyasî ve mîna sembola berxwedanî û remza hevgirtin û nasnameya gelê me tê hesibandin û ji aliyeke din ve, nasnama herî pêş çave xelkê vê herêmê ye, ku rojnama Agirî bi zaraveya wan û zêdetir ji bo wan çap û belav dibe.

Bo zanîna zêdetir û pênase kirina pişkek li xasmaniyên cuda cuda ye çiyayê Agirî ku rojnama me bi vî navî hatiye binav kirin, dê bala ve bo wan alîyên girîng û ber çave çiyayê Agirî rakêşin:

Her wekî tê zanîn Agirî navê çiyayekî herî bilinde Kurdistanê ên ku di xilasiya tuxîbên Bakurê Rojhilatê Kurdistanê ve rêze çiyayên Zagrosê bi çemê ***Aras*** ve girê dide û ketiye navbera tuxîbê sê welatên Îran û Îraq û Ermenîstanê. Bilindahiya Agirî 5137 mêtran li ser rûyê behrê ber bi esman hilkişiya ye.

Li mêj dem e ku efsane û çîvanokên cur bi cur derheq bi vî çiyayê gerdinkêş hatine gotin ku yên herî bi nav û deng, îşare bi vê hindê dikin ku di çax û serdemê berê de di çiyayê Agirî de burkan hebûye û ji ber vê hindê ku peşqel û guriya Agir li ser bilindahiya vî çiyayî de bilind dibû, navê Agirî li ser vî çiyayî danîne.

Yan jî eva ku li ***Tewrat***ê da îşare pê hatiye kirin ku li çax û heyamê hizretê Noh Pêxember de dema ku bahoz û kirêve bibû, gemiya hezretê Noh li ser vî çiyayî Agirî lenger girtî ye.

Xuya ye ku di van salên dawî de wî çiyayî bala lêkolînvan û pisporên çiyanase cîhanê bo aliyê xwe rakişandiye û renge di pêşerojê de zaf jî nepenî û xasmaniyên dine vî çiyayî bihêne eşkere kirin.

Xasmaniyeke dinê ye Agirî, dîroka siyasî ya Agirî ye ku di salên 1927 – 1931'e Zayînî de, yanî di wî çaxî de ku piştî tepeser kirina serhildana Simkoyê Şikak di Kurdistana



Îranê de, bizava Agirî li Kurdistana Tirkiyê bi serokatiya Êhsan Nûrî Paşa dest pê kir, ku navenda vê serhildanê çiyayê serbilinde Agirî bû.

Bi wî awayî bizava Agirî di vî çaxî de Tîrojka xwe avête nava piraniya deverên Kurdistanê û bû sembola hevgirtin û hevxebatiyê di navbera xortên neteweya Kurd li hemû parçeyên Kurdistanê, di pêxema gihîştin bi mafê çarenivîsa xwe de.

Li Kurdistana Îranê Celaliyan bi rêvebiriya ***Ferzinde*** û li Kurdistan Îraqê Barzaniyan bi rêvebiriya ***Şêx Ahmed***, û Kurdên Sûriye jî bi serokatiya ***Haco*** bi awayên cur bi cur di wê tevgerê de beşdar bûn, û bi cehd û xwe gorî kirinê karîn bi ava kirina Komara Agirî û çeqandina alaya Kurdistanê li ser bilindayiya Agirî, şanaziyek mezin bo neteweya Kurd biafirîn in.

Xuya ye ku ev serhildane jî piştî çar sal berxwedan û xweragirî, aqibet bi sedema komplo û îxaneta neyarên Kurdan ve hate tepeser kirin. Akinciyên vê herêmê tûşî qewmîneke herî mezine mirovî bûn û bi hezaran kes li jin û zarok û pîr û kal hatine qir kirin û bi dehan hezar kes jî bi terzekî hovane hatin veguhastin u dûr xistin ji mal û heyiya wan hate talan kirin û gundên van hatin kavil kirin.

Li vê demê were hetanî niho navê Agirî mîna landik û êvirgeha tevgera azadîxwazî û remza hevgirtin û berxwedan û nasnama belengazî û bindestiya Kurd û axa parve kiriye Kurdistanê di herêm û cîhanê de navbangê xwe derxistiye û bûye parek ji dîroka tejî ji bûyer û qewmînên netewa me.

Sedemeke dine bi nav û


Demokrasi bo Îranê | agirî | Otonomi bo Kurdistanê
Hejmar 1 Novembera 2003 | Sermaweza 1382e Rojî
Rojnameyeke siyasî û çandî ye | Parta Demokrata Kurdistana Îranê diweşîne

**Li çiyayê Agirî ve ber bi Rojnameya Agirî**

Doma wê 6

**Birêz Ebdula Hesenzade, Sekreterê Giştiyê PDK Îranê di hevpeyvîneke tevî Agirî de**

Xwendevanên hêja, Ev hevpeyvîna jêrîn bi şane bûn û kêfxweşiya weşana yekem hejmara Agirî ji aliyê desteya nivîskarên Agirî ve tevî rêzdar Ebdula Hesenzade Sekreterê Giştiyê PDK Îranê hatiye pêk anîn, em bala ve bo pirs û bersivên girînge wê hevpeyvîn radikêşin: Doma wê 2

**Nigeraniya Komara Islamî derheq avabûna sîstemeke federalî di Îraqê de**

Zanyar

Doma wê 4

**"Îran qurbaniyê terorizmê"**

Kurmanc Hakkî

Doma wê 10

Destpisiya malî li Îranê de 9 | Hilatina mejiyan li Îranê 18 | 22'min Kongireya Entirnasyonal a Sosyalist 19

dengî û xweştivî bûna Agirî dizivire bo qonaxa xebata çekdarî û berxwedaniya PDK Îranê dijberî rijîma kevnar parêze Komara Îslamî ya Îranê di salên 1980 – 1995e Zayînî de ku Partiya Demokrat navê yek ji hêzên xwedî şiyan û çelenge Pêşmergên xwe li Bakurê Rojavayê Kurdistanê de bi navê Agirî bi nav kir.

Ev hêza qehreman ku di pêxema berevanî ji mafê berheqe gelê xwe de karî bi terzekî bêmînak bi dehan û sedan hemase û şanaziyiyên mezin û ji bîr nekirî bo Partiya Demokrat u gelê Kurd biafirîne û bibe cihê serbilidiyê û peyva ser zimanê xelkê Pêşmerge parêze Kurdistanê.

www.arsivakurd.org

# Rewşa malwêrankere îtiyad(narkotîk)ê di Îran û Rojhilatê Kurdistanê da

**Azad Kurdî, Azadkurdi@hotmail.com**

Di cîhana evro de, ku mirovayetî bi tundî tûrikê xwe bo gihîştin bi pileyên pêşekftinê girê didet, ***Mewadê Muxedir anku narkotîk*** yê bûye mezintirîn kosp û asteng li ber rêya pêşketina mirovan di hemû waran de. Agirek ku heyia mirovan dişevitîne û dibe sebebê herifîn û ji hev belav bûna çarçove û bingeha malbatan. Ger li serjimêrîyên ji hev veqetana jin û mêran û jiyana neserkeftî ya wan, hin pîvan di destê me de heban, bêgoman mewadê muxedir, mezintirîn lîstikvanê vê tirajêdiyê dibû. Zor hatiye dîtin, ku keç û xortekî evîndarên hev ku ji parzinkên cur bi cur derbas dibin û piştî bi hezaran dijwariyan digehin hev, lê îtiyad bûna yek ji wan, hemû hêvî û xweziyên wan ji nav dibe û pirsgirêkek mezin ji bo civaka mirovayetiyê dixulqîne.

Heger em bixwazin li ser rewşa xirab û malmêrankere mewada muxedir ku niha li bajarên Kurdan zêdetir li herêmên din belav bûye nirxandinekê bikin, hewceye li berahiyê hinek li ser rewşa îtiyadê li tewahiya Îranê de bas bikeyn:

Ciwanên her welatekî sermaye û gencîneyek in, ku hikmê serbilindî û serfiraziya gel û netewa xwe pêk dînin. Pêşeroja geşa her welat û neteweyekê mirov dikare di çawanî û rewşa jiyana ciwanên wan de bibîne.

Em binêrîn ku rewşa civak û ciwanên Îranê piştî 24 salan desthilatdariya Komara Îslamî ya Îranê Çawa ye? Hebûna 44 milyon kes heşîmeta(şêniya) di bin temenê 30 salî de li Îranê û cîranbûna tixûbê Îranê tevî mezintirîn welatê çêkerê mewadên Efyonî di cîhanê de (yanî Efxanistan), wisan jê kiriye, ku Îran bi yek ji riyên derbasbûna Mewada Muxedir bo Rojhilata Navîn, Ewropa û Amerîka bê hesibandin. Lê zirar û xisara mewadê berî her cihî li hevwelatiyên Îranê dikeve, piştre digehije welatên din. Goriyên yekem û sereke yên wê, xelkê Îranê, bi taybetî zêdetir ji 10 milyon kes ji netewa Kurd e. Lewre ev mewada malwêranker bi berfirehî û pir bi hêsanî bi destê ciwanên Îranê dikeve. Em dikarin bêjin ku îtiyad bi muxediratê(tûşhatina bi narkotîkê) li Îranê bûye pirsgirêkeke bingehîn. Li gor agahî û jêderên nû, ku derheq mifa wergirtin ji mewadê muxedir û îtiyad li Îranê tên weşandin, îtityad bûye pirsgirêkek mezin û neçareserkirî ya Civakî!!!

Li gor rapora semînara pêşgîrîkirin ji zêdebûna îtiyadê, ku li havîna sala 1380 Rojî(2001 Zayînî), li bajarê Meşhedê, hate li darxistin, 70% ji wan kesên ku tûşî îtiyadê bûne mirovên malbatdar in(zewcî ne). Bilî vê Çendê jî di her rojê de 600 kes sexmeratî mewadê muxedir li Îranê tên dest bi ser kirin(tên girtin). Di her mehekê de 100 kes bi sedema kişandina zore teryak û heroyînê dimirin. (1)

Tê gotin ku di her rojê de 500 kes ji ciwanên Îranê tûşî kişandina narkotîkê dibin(mutad dibin). Heşîmeta mutadan li Îranê her 10 salan du beramber(du qat) dibe. Lê ya herî balkêş û cihê kul û keserê eva ye, ku roj bo rojê ji radeya temenê ew kesên ku tûşî muxediratê bûne, kêm dibe. Mixabin niho ev nesaxî zêdetir di nav xwendekarên welat de bi awayekî berfireh belav bûye û sed heyf rû li zêdebûnê ye.



## Eger û sedemên zêdebûna îtiyadê di civaka Îranê de çi ne?

Pirsên wê mijarê, eve ne ku eger û sedemên bingehîn yên îtiyadê li Îranê çi ne? Çima tu çareseriyek ji bo wê pirsgirêkê nayê kirin? Qurbaniyên wê kî ne? Dê encama wê çi lê bihê?!

Bi giştî, îtiyad di her civakekê de ji ber nebaşiya warên cur bi cure siyasî, aborî, civakî, paşdemayîna bîr û rayên çandî û ewlekariyê derdikeve rojeva jiyanê. Dizîkirin, hejarî û nedarî, fesada cur bi cure yekkesî û giştî, bêkarî, kuştin, bêhêvîtî ji paşerojê re û . . . hwd ji belayên tirsnak ên îtiyadê li civaka niho ya Îranê ne. Temenê zewicînê ji ber pirsgirêkên aborî û malbatî heya qaseke zêde çûye jor, qasa ji hev veqetana jin û mêran zêde bûye û gelek pirsgirêkên din yên nexweş.

Îtiyad û nesaxiyên civakî yên din li dema desthilatdariya rejîma berê ya Îranê (Pehlewî) hindik bû. Civaka Îranê û bi taybetî civaka Kurdewarî li Kurdistanê wê demê di wî warî de sax û paqij bû, lê piştî bi ser kar hatina rejîma paşverû ya melayan li sala 1357 rojî (1979

**Doma rûpelê 7:**

## Rewşa malwêrankere îtiyad(narkotîk)ê di Îran û Rojhilatê Kurdistanê da

Zayînî) pirsgirêkên civakî, siyasî, aborî û çandî bi zanebûn dan dest pêkirin. Em dikarin bêjin ku şerê 8 saliye Îranê û rejîma ji nav çûya Beissî ya Îraqê bandoreke mezin di wê bûyera civakî de heye.

Rejîma Komara Islamiya Îranê dirav(bodce)ke gelek zêde ji bo domandina wî şerê bê mentiq, bi pêkanîna saziyên mîna Supahê Pasdaran, êstixbarat (êtilaat), Besîcê Merdomî, alîkarî kirina hêzên terorîst li Rojhilata Navîn û hemû deverên din yên cîhanê û hin dezgeh, hêz û saziyên ne hewce bi kar anîne. Eger ev dirave ji bo fêrkirin û hînkirina nifşê ciwan û zarokan hatiba terxan kirin. Niha civak ji kes û kesayetiyên zane, kêrhatî û hişyar dewlemend dibû. Rewşa jiyan û gel mîna niha nedibû. Lê wan hergav şiyan û hizra xwe daye tiştên jorîn û tenê tepeserkirina ciwan, xwendevan û xelkê bûye karê wan yê sereke. Eva bû ferhenga dewletdarî û desthilatdariya wan. Mînaka herî baş û zindiye wê qirkirin û tepeserkirina Kurdan bi awayeke hov û cinayetkarane bû, ku bi taybetî ji sala 1979an heya 1985an bi tundî li hemû Rojhilatê Kurdistanê berdewam bû.

Zêrevan û civaknas dibêjin, ne ev kiryarên tund û tîje hêzên rejîmê û ne jî ev bernameyên çandî – civakî yên saziyên propagandeyî (teblixatê) li Îranê nekarîne ji çûna xelkê bo aliyê mewada muxedir pêşgîriyê bikin.

### Kurdistan û Tirajêdiya îtiyadê

Rojhilatê Kurdistanê ji 4 wilayetên: Urmiye (Azaerbaycana Rojava), Kurdistan (Sine), Kirmaşan, Îlam û pareke mezina wilayeta Loristanê pêk hatiye. Piraniya rûniştvanên van çar wilayetan Kurd in. Zêdetir ji 10 milyon Kurd di van wilayetane de dijîn.

Îtiyad li herêmekê bo herêma din ferq heye(cudatî tê dîtin), Kurdistan berevajî herêmên din yên Îranê û bi sedema Kurdbûn û daxwazkirina mafên neteweyî yên xwe pitir ketiye bin bandora wê siyaseta çewt. Her wek pêştir jî bas hate kirin, civaka Kurdan li dema desthilatdariya rejîma Paşatî ya berê(Pehlewî) û destpêka desthilatdariya rejîma Komara Îslamî pir paqij û pak bû, lê siyasetên nemirovane yên Komara Îslamî, rewşa civata Kurdan tûşî derdên giran kirine û şepirzeyiyek xirap xistine nava malbatên Kurdan. Rejîma paşverû ya Îslamî bersiva



xwestek û daxwazên Kurdan yên aştîxwazane û berheq bi şer û bersiva kuştin û qirkirnê dan. Wan hurmeta neteweya Kurdan şikandin û gelek sivikatî bi kesayetiya netewî ya Kurdan kirin. Ev şerê kuştina mejî û hêza ciwanên Kurd li hemû deverên Kurdistanê dom kir û hên jî bi germî berdewam e. Kurdan bi rêveberiya partiyên xwe yên siyasî li hemberî wan siyasetên kawilker û hovane berevanî ji mafê netewî û berheqê xwe kirin(2).

Deshilatdarên Komara Îslamî bi mifa wergirtin ji hêza êstixbarat(êtilaat)ê, hewil dan, ku mejî û hêza bingehîne şoreşê yanî ciwanan ji nav bibin. Ev siyaseta ne mirovane û bê exlaqane ya wan niho bi gur û tundtir bûye. Ew dixwazin bi vê siyaseta xwe îradeya berxwedana gelê Kurd bişkînin. Dema mirov bala xwe dide rewşa aloz û şepirzeye îtiyadê li Rojhilatê Kurdistanê, wijdana mirovayetî û Kurdane ya herkesî matmayî dimîne.

Niha di Îran û Kurdistanê de du curên muxediratê, weke Tiryak û heroyîn(narkotîk) zêdetir tên bi kar anîn. Ew bi erzanî(bihayê ne giran) û bi awayekî berfireh bi dest dikevin. Bi xasmanî di heps û girtîgehên rejîmê da ku niha bûne bazara herî mezine muxediratê. Rewşa îtiyadê ewqas xirab bûye, ku gefeke mezin li xortên gel û netewa me diket û dibe em li hizra paqijkirina nifşê xwe yê paşerojê de bin.

Ev siyaseta hovane û nijadperestane ya rejîma melayan jî dibe mîna tirajêdiyek xemgîn di dîroka Kurdan de bête mêze kirin. Niha kirîn û firotina tiryak û heroyînê bêtirs li her dereke bajar û gundên Kurdistanê û bê tirs û lerz ji girtin û zindanîkirinê didome. Pişkek zaf ji wî mewadî hêzên kirêgirtî û kesên xwefiroşe dezgehên êstixbarata Îranê di nav ciwan û gel de belav dikin. Ew hazir in, ku tiryak û heroyînê bê dirav bidin wan kesên ku dixwazin wê di nav gel de belav bikin. Eva rast e û em dibînin û dibihîsin, ku dewlet bi wî awayî xizmeta « pêşveçûna Kurdan » diket!!!


_Jêder:_

1. _Rojnameya **Hamshari** Çapa Tehranê, hijmar (3120)_

2. _Dokumentên rojnamevanê Kurd, birêz Kakşar Oremar_


www.arsivakurd.org

# Destpîsiya malî di Îranê de

Bavê Hejar
hejar@yahoo.com
7.11.2003

Sîstema ramyariya Komara Islamî bi awayekê hatiye damezrandin, ku her carê bi afirandina tengasiyekê xelkê mijûl bike û rê nede pirsgirêkên abûrî, civakî û siyasiyên xwe bînin ser ziman. Rewşa han bûye sebeba wê yekê ku bertîl xwarî di nav Komara Islamî de bibe yek li rêyen çareseriya pirsgirêkan û ji aliyek din jî damezrandina mafiyayek malî di nav sistema abûriya Îranê de. Lewma her çewa li kurdî de me bo hinek mehên salê gelek navên cur bi cur hene di komara Islamî de jî ji bona rişwê gelek nav hatine saz kirin: Heqdest, destxweşî, ya natilya, jêr mîzî, perê çayê, dew şirîn kirin û bi dehan navên din.

Ji Bona wê ku em bikaribin bersiva sebeba bertîl (rişwe) xwarinê di nav civak û çînên cur bi cure Îranê bidin, belkî ya qenc ev bît em mêzeyî şêwaza dabeşkirina deshilatê li Îranê de bikin. Mezintirîn deshilata abûrî li Îranê ne li destê kompaniyên taybetî an dewletî daye belkî li destê rehendek sêhem binavê ***Binyat*** ku birastî taybet bi Îranê ye dey e.

Binyatên Îranê bi navên cur bi cur xwediyê hêzek abûriye gelek mezin in ku belkî di seranserê cîhanê bi wî awayî nebit. Ji nav vana dikaribin îşare bi Binyata Mustezefan ku li despêka temenê Komara Islamî li rêberê rêjimê Ayetullah Xumeynî damezrand. Ji bilî wê binyata Canbazan, Binyada Şehdîdan, Komîtey Imdada Xumeynî, Binyada 15'ê Xurdad, Camiey El-Sadêq, Binyada Amîn ol Moiminîn û hdv, dikaribin nav bibin. Astana Qudsi Rezewî ku erka pêragehiştin bi mezarê Xumeynî bi istûyê wê ye, him di warê deshilata abûrî û him jî di warê şêwaza kar de di gel binyatên din di gel hebûna wekheviyan gelek cudahî jî hene.

Diber wê jî bertîl xwarî li Îranê ew hinde mezin bûye ku em dikaribin basa "rant xwariye" bikin.

Li sala 1994 ve ku hinek li dizî û dest pîsiya karbidestên komara Islamî di rojnameyan de hat weşandin, kar û çalakiyên binyatên nav Îranê de ketin ber bala bîr û rayên giştî. Ev nûçeyên ku car car bi navê gote got di nav xelkê de dihatin axiftin hêdî hedî bûn serdêr û nûçeya yekeme rojnameyên di nav rejîmê jî tên weşandin. Piştî eşkere bûna 123 milyar tûmen ***rent xwarina*** banka Sipeh, **Fazil Xudadad** bi tawana fesada abûrî hat dar xistin. Xuyaye ku Xudada wek moreyek bûye qurbaniyê sîstemek mezintir ku bi destê ayetollha birêve diçe. Di piroseya aşkira bûna perwenda 123 milyar tûmenî de navê Mortaza Refîq Dûst gelek kevtibû ser zara û yek ji moreyên herî zor cihê gumanê bû, lê Refîqdûst li aliyê rêberê komara Islamî we hat parastin û berprsayetiya wî bo serokayetiya Binyata Mustezefan hetanî 5 salên din jî hat taze kirin. Bi wî awayî hat nîşan dan ku rêberê mezine komara Islamî bi xwe jî yek ji beşdarên rênta 123 milyariye.

Ji gor serekaniyên abûrî li dahata "naxalise" Îranê ku xwe digehîne nizîkê 115 milyar Dolara, zêdeyî 35 milyar Dolaran dikeve xizmeta abûriya bin erdê û li kanalên ne fermî digehin destê xwedî deshilatan. Abûriya weşartî (bin erdê) tiştek nine ku bikaribe di serjimêrî û statîkan de bê xuyanî kirin. Ew abûriya han ji meydana çalakiyên binyata ne.

Xuyaye bo welatek mezin mîna Îranê beşa binyatan di abûriya Îranê de ku xwe digehîne 2 -3 % nikaribe karek zor ser abûriya Îranê bike. Lê ya giring çarenivîsa wan binyatane û herwisa ew rola ku ew binyadane li ser siyasetên abûriye Îranê digêrin e. Jiberku mafiyaya deshilata wan binyatane ew qas mezine ku dikaribin pêşkevtina abûriye beşa taybetî û beşa dewletî bisekinînin.

Nebûna zelaliya abûrî di sîstema komara Islamî de bûye sebeba wê yekê ku beşa ne dewletî û ne taybetî hêdî hêdî bibe xwedî deshilat li nav beşa neftê de jî. Yasaya komara Islamî taybetî kirina abûriya neftê qedexe dike, lê diber taybetî nebûna binyatan ewane rê heye bibin xwedî şerîkên neftê.

Bi wê sîstema taybet, karbidestên Komara Islamî karîne sermayeyên gelek mezine gelên Îranê li welat derxînin û li bankên derve razînin. Armanca wana dikaribe 2 tişt be, digel misoger kirina warê jiyana xwe ya paşrojê dikaribin bi wî sermayê bibin sedema sazkirina saziyên terorîstî.

www.arsivakurd.org

**Doma rûpelê 1**

# ”Îran qurbaniyê terorîzmê”

Nivîsîn û wergêran: Kurmanc Hakkî



derxîne û cîhanê li terorîstan paqij bike. Êrîşên terorîstî piştî şerê Îraqê zêdetir ji berê dişopin û bûne sebeba wê yekê ku piroseya aştiya Filistîn û Îsraîlê jî bi tewawî bê herifandin. Pirojeya ***Xarîta Rê*** veke xuyaye berî ji dayikbûnê di ber êrîşên xwekujiye terorîstan tê fetisandin. Hêzên terorîstî xwe bi nûnerê gelê Filistîn û berevanên nirxên Îslamî dizanin. Hemas, Cehad û Hizbullah ev rêkxistin in ku berpirsayetiya êrîşên xwekujî bi istû digirin û hemî rêkxistinên han ji aliyê Komara Îslamî tên piştigîrî kirin.

Rejîma Îranê gelek berî êrîşa 11’ê Septembrê piştgîrî ji terorîzma navnetewî kiriye û bi dehan neyarên siyasiye xwe li rêya teror li dereve û hundirê welat ji holê rakirine. Rejîma han li hemî welatên din zêdetir dijî aştiyek wiloye li Rojhelata Navîn ku têde gelên Filistîn û Îsraîl bi mafên wekhev û bi cînaretî welatên xwe avedan bikin. Komara Îslamî li roja hatine serkare xwe, Îsraîl wek welat bi fermî nas nekiriye û li ***Misilmanên Cîhanê*** xwestiye welatê ***Benî Îsraîl*** ji holê rakin. Komara Islamî di dîroka zêdey li 24 salên xwe de her tim alîgir û piştîwanê hêzên terorîste deverê bûye.

Li sala 1979 hetanî niho zêdetir ji 1000 kes li 200 êrîşên terorîstiye Komara Islamî hatine kuştin. Nêzikî 600 kes li hevwelatiyên Îranê li derevey Îranê bi destê komara Islamî hatin teror kirin, ku 80 kes ji wana li sinûrên welatên Ewropa de hatin encam dan. Di encama dadigeha bi nav û denge ***Mîkonos*** de îdî bo hemî cîhanê derket ku rêberên herî bilinde Komara Islamî biryara wan terorana dane.

Hêrişên terorîstiye paş şerê Îraqê, nîşan didin ku ne tenê alîgirên rejîma berêye Îraqê, belkî hinek welatên cîran jî destê wan jî têkelî xwîna bi dehan kes ji xelkê Îraqê u hêzên hevpeyman sor bûye. Cîranên Îraq û xasmayî Komara Islamiya Îranê ji vê çendê ditirsin ku Îraq bibe welatek demokrat û li ser bingeha ploralîsta siyasî, çandî û neteweyî bê damezrandin. Tilisma han xewnek gelek nexweş e bo rejîmên dîktator û terorîst perwer. Kuştina Ayetullah Hekîm li roja 23.8.2003 gumanê ne tenê dibin ser alîgirên Seddam, belkî paşerokên welatên cîran û nemaze Komara Islamî jî têde xuyanî dikin. Geşe kirina nirx û bihayên demokrasî û ploralîsmê hêcetek baş e bo kevnaran fermana Cehadê li Îraqê der bikin û bo tepeser kirina projeya Xarîta Rê piştgiriya tund û tîjî û êrîşên xwekujî li Filistînê bikin. Karê han vê hêzên Emerîka li Îraqê asê bike û tengejê di wê deverê de berdewam biket û damezrandina dewleta serbixweye Filistîn û aştiya deverê vê tenê wek xewnek xweş bimîne. Bi vî awayî Îran vê bikaribe bi keyfa dilê xwe cuda hizirkarên navxwe bifetisîne, alîkairya hêzên terorîst bike û di cem wana jî programa xwe ya sazkirina çekên navokî dom bike.

Israîl di piraktîk de tenê welateke li Rojhelata Navîn ku xwediyê sîstemek demokratîk e. Her çend siyaseta dagîrkeraneye Îsraîl cihê şermezar kirinê ye, lê ewa ku welatên deverê ditirsîne berî her tiştekê demokrasiya wî welatiye.

Berî 6 salan dema serok komar Xatemî hat ser kar, wî hevceyiya diyaloga navbera şaristaniyan anî ser ziman. Hevdem di welatê bin hikmê Xatemî de kuştinên rêzokî, terorên bi dizî ve, zîndanî kirina rojnamevan û cuda hizrkaran bi awayek berfireh hat şopandin. Zêdeyî şeş sal serok komariya Xatemî û 24 sal dîroka Komara Islamî hevceyiya rexne ji xwe girtinê derheqî pêwendiyên wê bi mirovên dereve û navxweye sînorên xwe li her demekê zêde rojevtir kiriye. Eger Îran birastî dixwaze li cîhana îro de cihê xwe peyda bike û bibe cihê rêz û qîmetê û eger her wekî balyozê wê Cevad Zarîfî (Time Europe 11.11.1996) gotiye “Îran qurbaniyê terorîzmê ye” ev dibe rexneyên bingehîn ji xwe destpê bike û rêz bo mafê mirove hevwelatiyên Îranê dabinê û dest ji piştgiriya rêkxistinên terorîstî hilbigire. Ji bona bi dest anîna aştiyê li Rojhelata Navîn ev dibe welatê Îsraîlê bi fermî binase û piştgîriya xwe li hêrişên xwekujî biqetîne. Vê demê mirov vê bikaribe bawir bike komara Islamiya Îranê dayka terorîzmê nine.

* Ev nivîse bi zimanê Finlandî bona 11. salvegera terora şehîd Dr. Seîd Şerefkendî li malpera www.kurdistanmedia.org da hatiye weşandin.

www.arsivakurd.org

## Hunermend Cewad Merwanî:

# “Firotina çandê firotina namûsê ye!”

**SALIHÊ KEVIRBIRÎ**
**salihkevirbiri@hotmail.com**

*Cewad Merwanî; di sala 1965’an de li gundê Boşata Farqînê hate dinê. Merwanî, xwendina xwe ya seretayî, nîvî li gund û nivî jî li bajêr bire serî. Xwendina xwe ya bingehîn jî li Farqînê domand. Li gorî gotina wî, “salên wî yên surgûniyê” jî çêbûn. Merwanî ji ber van sirgûniyan nîv salekê li Batmanê û nîv salekê jî li Diyarbekirê xwend. Di darbeya 12’ê Îlonê (Rezberê) de di dema lîseyê de rastî sivikatî û lêdanan hat. Bi qasî sê mehan li Diyarbekirê di Enstîtûya Perwerdehiyê de xwendina xwe domand. Dema ku li Diyarbekirê bû, qeyda xwe li ‘Konserwatuara Muzîkê’ pêk anî. Demeke kurt di Radyoya TRT’ê ya Diyarbekirê de xebitî. Tiştê ku di radyoyê de jê hat xwestin, nekarî pêk bîne û dest ji karê radyoyê kişand. Ji ber ku jê dixwestin ew gund bi gund bigere û stran, awaz û kilamên kurdî berhev bike, paşî jî li tirkî wergerîne. Di sala 1984’an de di nava gel de dest bi karê hunerî û stranbêjiyê kir. Xebatên wî wekî Kaset û sêlik (CD) derketine pêşberî guhdarên kurd.*

*Cewad Merwanî ev çend sal in ku jiyana xwe li xerîbiyê ango li Almanyayê didomîne û kar û barên xwe yên huner û stranbêjiyê li ‘Akademiya Çand û Hunera Kurdistanê’ didomîne.*

*Li bajarê Durena Almanyayê li avahiya Akademiyê em bûn mêvanê Cewad Merwanî....*

**Kekê Cewad, jiyana te ya hunerî çawa dest pê kir. Cara ewil tu li ku derê ketî nava karê hunerî. Yekemîn kilama ku te got kîjan bû?**

Cara ewil ez nizanim ku min kîjan kilam got. Di malbata me de her kes ketibû bin bandora olî û hemû hecî û mele bûn. Dengê wan hemûyan xweş bû. Min jî demekê feqîtî kir. Ez diçûm ser banê mizgeftê û min bang dida. Min qesîde dixwendin. Lewre min hingê kifş kir ku dengê min xweş e. Wê êlhamek da min. Paşê min dest jê kişand. Paşê ji bo ku bibim mamoste qeyda min li Enstituya Perwerdehiyê hate çêkirin. Lê min nedixwest ku ez wekî memûr û karmendekî dewletê bixebitim. Min dixwest ez serbixwe bim. Lewre jî min dest ji xwendina mamostetiyê berda. Paşê ez ketim Radyoya Diyarbekirê. Di nava gel de pêşbirke û çalakiyeke hunerî çêbû. Min qezenc kir û ez bûm xebatkarê radyoyê. Armanca wan a bingehîn jî ew bû ku xortên dengxweş ên kurd peyda bikin, wan bibin metropolan û di nava çanda tirkî de bihelînin û ji bo xwe û çanda xwe bi kar bînin.

Paşê teyîbek dan min û ji min xwestin ku ez di nava gel de bigerim û stranên gelêrî berhev bikim. Min jî nedizanî û ez li hemû herêman geriyam. Ji Xerzan heta Diyarbekir, Qulp û Sasonê gav bi gav geriyam û min stranên gelêrî berhev kirin. Min dixwest wan stranan bidim wan, lê çend heval û dostên min ên bi navê Berzan, Salih, Mensûr Cahîd, Cewad nehiştin ku ez wan kilam û stranan bidim wan. Ji min re gotin: “Tu çawa çanda xwe difiroşî. Çawa ku mirov namûsa xwe bifiroşe” Wan ez razî û serwext kirim û min ev kilam û stran nedan wan. Paşê min ji xwe re hildan.

**Te çawa dest bi hunerê kir?**

Ez berê diçûm dawetan. Me bê saz û muzîk stran digotin. Piştî ku teknîk pêş ket, ligel hevalekî xwe me dest bi karê muzîkê kir. Navê hevalê min Hesen bû û ew kurxalê min bû. Ew hê jî karê xwe li Diyarbekirê berdewam dike. Wê demê me bala xwe dayê ku bi du kesan çênabe, me şagirtên nû girtin û me ew hîn kirin. Me di nava salekê de çend şagirt hîn kirin. Me bi kurdî dest pê kir. Ji ber tirsa ku kurdî qedexe bû hin caran jî me bi tirkî digot. Me nedikarî em navekî li koma xwe bikin. Ji tirsa polîsan me nedikarî em xebatê bikin. Li gundan em rehet bûn. Paşê ku gel hinekî em nas kirin û em jî hînî kar bûn, em bi ser ketin.

**Bi qasî ku ez dizanim, tu ji malbateke dîndar (oldar)î tê. Li gel dengbêjî, awaz û stranên kurdî, sewt û awazên tesewûfî û olî jî bandor li te kirine. Ez şaş im gelo?**

Na! tu rast dibêjî. Malbata me li gel ku malbateke şoreşger û welatparêz bû, eynî wext jî malbateke oldar jî bû. Babê min bixwe wekî hunermendekî şareza beyt û qesîde dixwendin. Ew dengbêj nebû lê dengxweş bû. Ez hinekî di bin bandora wî de mame. Melayên gundên me û yên dorhêlê jî bandor li min dikirin. Meleyek jî xalê min bû.

**Me behsa bandorkirinê kir, hate bîra min tu jî wekî piraniya dengbêj û stranbêjan gelek behsa radyoyên kurdî yên wekî Erîvan û Bexdayê dikî. Ne wisa ye?**

Rast e! Gelek tesîr li min kirine Radyoyên Erîvan û Bexdayê. Jixwe dengbêj û hunermendê ku bêja Radyoya Erîvan û Bexda tesîr li min nekiriye ne rast e. Min endam, bêjer û hunermendên radyoyê nas nedikirin lê dengê wan kesan pir li xweşiya min diçû. Eyşe Şanê jî wekî hunermendeke jin bandoreke mezin li min kiriye. Mihemed Arif Cizrawî, Hesen Cizrawî, Şeroyê Biro, Kawîs Axa, Karapêtê Xaço û hwd. Hemû ev liambêjane navên ezîz in ji bo min. Ez her dem feyza xwe ji van navan digirim.

**Wekî din heger tu çend navan li van navan zêde bikî, dê tu çi navan lê zêde bikî?**

Ji herêmê Mehmûd Qizil û Husênê Faro gelek bandor li

www.arsivakurd.org

**Doma rûpelê 11: Hevpeyvîn bi hunermend Cewad Merwanî re**

min kirine. Babê min pîlakên wan distandin û min ku lê guhdarî dikir di hişê min de diman. 'Kewê Ribat' Şakiro hatibû Melezgirê û me carekê hev dît. Hevnasiya min bi Dengbêj Zahiro, Salihê Qubînî, Eyşeşan û Mehmûd Qizil re çêbû. Bi taybetî dostaniyekî min û Salihê Qubînî yê baş hebû. Baş tê bîra min şeva ku min terka gund kir, me xatir ji hev xwest...

Te bi kîjanî re stran gotine:

Min bi Eyşe Şan û Xalê Fewzî re stran gotine. Lê ne tiştekî wisa wekî bername yan tiştekî din tenê em bi hev re rûniştine û me kilam gotine. Min ji bîr kir ez bêjim. Rehma Xwedê lê be, bandora rehmetiyê Şiyar jî gelek li ser min heye. Ew yê vê dawiyê bû û bandora wî li ser gel jî hebû.

**Em werin ser rol û girîngiya dengbêjiyê. Li gorî te çima ewqas girîng e dengbêjî û stranbêjî? Rola wê ya di çand û wêjeya kurdewarî de çi ye?**

Salihê Bira wekî tu jî dizanî, ji ber ku arşîva me tunebûye em nizanin ka kilam û stran kengê hatine çêkirin û qewimîn kengê pêk hatine. Lê kilaman bandoreke mezin li ser gel heye.Yanî arşîva zindî ne dengbêjên kurd. Ji ber ku nivîsîn û tomarkirin li welêt tunebûye barê giran hemû maye li ser milê dengbêjan. Bi rastî em deyndarên dengbêjan in ku ew dîrok ji me re xwedî kirine.

Li ser wêjeyê jî rola wan zêde ye. Bo mînak strana Zembîlfiroş. Berî hezar salan li Farqînê dewleta Merwaniyan ava bûye û kilama Zembîlfiroş di wê demê de hatiye çêkirin. Lê em nizanin ku ew di destpêka avakirina dewletê de yan di kîjan demê de hatiye çêkirin, lê em tenê vê yekê dizanin ku dengbêj nebûna niha me kilama Zembîlfiroş nedizanî. Rola dengbêjan di parastina çanda kurdî de gelekî mezin e. Gava ku mirov bala xwe dide gotinên strana Zembîlfiroş mirov lê dinêre ku wêjeyeke gelekî balkêş tê de heye.

**Eger em ji te bixwazin ku tu behsa bîranînekî xwe yê zarokatiyê ku li ser dengbêj an dengbêjiyê ye bikî, tê ji me re çi bêjî?**

Gelek bîranîn hene. (kurtedemek difikire, piştre bi bişirîneke zirav axaftina xwe berdewam dike) Rojekê Mehmûd Qizil û Eyşe Şanê hatine bajêr û her kes çû dîtina wan. Dê li sînemayê konser bidana. Em zarok jî çûbûn ser dîwaran ji bo ku tenê ji dûr ve be jî em bikarin wan bibînin. Çawa ku melayketek hatibe wir û mirov here dîtina wê. Hewçend ku Eyşe Şanê bandor li gel dikir. Mehmûd Qizil jî her wisa. Rojekî xweş bû...

**Dibêjin daweta bêdengbêj ne tu dawet e. Dîtina te çi ye divî warî de?**

Daweta ku dengbêj lê tunebe, kêmdawet e. Baş tê bîra min, dema dawetek çêbûya û dengbêj û stranbêjên wê dawetê tunebûya, digotin; "Werin em herin filanderê, 'daweta bêdeng' heye...!" Ku dengbêj an hunermendek tunebûya tama wê dawetê jî tune bû.

**Ez vê pirsê ji tevahiya dengbêjan dikim. Lewre jî dixwazim tu jî bersiva vê pirsê bidî; Gava tu dest bi gotina kilaman bikî, wê bikaribî çend kilaman bibêjî. Kilamên ku te bi xwe jî çêkirine hene?**

Kilamên ku min bi xwe çêkirine nêzîkî 55 heb in. Ku hinek kuta nebûne. Min hinek ji wan tomar jî kirine. Wekî 'Dayîkê', 'Kekê min ê Penaber', 'Rojhilata Navîn', 'Gelê Kurdistan', 'Ew kî bû ev dil şiyar kir?', 'Evîndarî ne wiha ye', 'Mezra Botan' û 'Sazbendo'

Hinek jî hene ku min ji helbestên Meleyê Cizîrî, Meleyê Bateyî û Seydayê Dilbirîn girtine. Min ji wan re muzîk çêkirine. Ez niha nêzîkî 3000 stranî dizanim. Dibe ku ez hemû strana bi giştî dizanin lê qet nebe ez muzîk û awayê gotina wan dizanim.

**Min bihîst ku tu berhevkirinan jî dikî...**

Belê xebateke min a berhevkirinê heye. Min dil heye, stran û kilalên kurdî berhev bikim û bidim weşandin. Dê ev xebat, ji kilam û stranên gelêrî û folklorî pêk bê. Şêwaz, nota û awayên reqsên wan hemû dê di vê xebatê de hebin. Ezê heta serê sala 2003'yan amade bikim. Fikra min ew e ku navê pirtûkê deynim*"Stranên Kurdî yên Gelêrî û Folkolorî"* .

**Cewad can, eve demeke ku tu kar û xebata xwe ya hunerî li mişextiyê, ango ji dûr welêt û li xerîbiyê berdewam dikî. Zehmetiya xebata li dereveyî welat çi ye gelo?**

Ji bo hunermenedek û ji bo nivîskarek, gava bixwaze karê xwe baş pêk bîne, welat baştir e. Ev deh sal in ku ez li Ewropayê me. Tu bawer bike, her şeva ku min serê xwe daniye û raza me, min di xewnên xwe de welat dîtiye. Ez hêjî hînî jiyana li Ewropayê nebûme. Ez hîn nabim jî. Her tişt sunî û beredahî ye. Tiştên xwezayî li vir tune ne. Ji bo hunermendan jî ev yek gelek zehmet e. Xerîbî zor zehmet e. Mirov dikeve nava tengasiyan. Li vir her cure derfetên teknîkî hene lê germahya gel û xebatê kêm e. Lê li welêt ne wisa ye. Ku xebata em li vir dikin heger me li Diyarbekirê bikira, ez bawer im niha 500 şagirtên min hebûn.

**Mamoste Cewad, zor sipas ji bo bersivdayîna pirsên me. Mala te ava...**

Mala te avatir. Bi riya vê gotûbêjê ez dixwazim peyamekê jî bidim. Ez hêvîdar im ku kesên li ser hunerê dixebitin, bila li çanda kurdî hûr bibin û lê xwedî derkevin. Bila berhemên xwe nedin talankirin û dizîn. Her wiha bila berhemên xwe yên gelêrî berhev bikin û bi pêş bixin.

********

www.arsivakurd.org

Doma rûpelê 20

# Sedsaliya ji dayik bûna Cigerxwîn pîroz be



**Xwendin nebe kes naçe pêş,**
**Peyda dibin pir derd u êş,**
**Her dem di bin destê neyar,**
**Em dê bidin xûkî û bêş,**
**Ev tac û şewket xwendine,**
**Ev dîn û dewlet xwendine,**
**Ev serbilindî xwendine,**
**Ev dewlemendî xwendine,**

Cigerxwîn di helbestên xwe de her gav li ser wan tengavî û bê çareiyê ku millet tê da bûye nivîsandiye û şûnwarê hovîtiya dijminan li ser jiyana gel daye eyan kirin û rewşa welat wisan aniye ziman:

**Dijmin hilveşand tev gund û bajar**
**Zar û zêçên me jar ber dîwar**
**Li jor balefir, li jêr tang û top**
**Ji xûnê sor bûn hemû şûn û şop**
**Welat carek dane ber şewat**
**Milet Perîşan, bê kar, bê xebat**
**Birçî, û tazî, hemû perîşan**
**Bê mal û bê cî, ne xev, ne razan.**

Cigerxwîn bi helbestên xwe tovê netewe perwerî û welatparêziyê direşand û bi bingeh girtina vê bîr û bawerê, rêya xebat û berxwedanê nîşanî keç û kurên Kurdan didan û bi helbestên weke: Kîne Em, Herne Pêş, Şam Şekire Welat Şirîntire û … gelekên din, karî hêza pangiriye gel di hemberî dijminan de biteqîne û bibe pêşengê helbestvanên şoreşger di vî çaxî li Bakûrê Kurdistanê de.

Evî baweriyek mezin bi rolê wekheve Jin û Mêran di nava civakê de hebû û bo nav birina evan qeyd û bendên paşveroyî, ku nedihêla keç û jinên Kurd bikevine xebatê, di helbesteke xwe de wiha gazî keçên Kurd dike:

**Keçê rabe, serî hilde, di vî çaxî weha nabî,**
**Binêr, jin çune ezman, heta kengî di xew da bî,**
**Çine ev çarik û peçî di rextada xwe rapêçî,**
**Bi destê te keleşînkof, bila zana û xwenda bî**

Cigerxwîn dilxweşiya xwe derheq serkeftina Kurdên Îranê di sala 1946an de ku Komara Kurdistanê bi destê rêberê Parta Demokrata Kurdistana Îranê Qazî Mihemed hate îlan kirin, bi vî awayî tîne ziman:

**Xakî Kurdistan bî qurban, pir ciwan û paqijî,**
**Xwîn rijandin pir kurên te wa li her alî rijî,**
**Miletê Kurd ta ku saxe ev ji vê rê nagerî,**
**Aferî, Aferî, Qazî Mihemed Aferî**

Cigerxwîn ne tenê helbestvan, belkî zimanzaneke pêşenge gelê me bû ku kar li ser her du zaraveyên sereke ye Kurdî (Kurmanciya jorîn û jêrîn) dikir ta ku şarazayiyek baş peyda biket û li danîna rêzmana Kurdî de wan du zaraveyan bi hev re bixebitînît û bibîte serçopîkêşê şayîrên serdemê xwe û li ser zimanê Kurdî bi vî awayî hizra xwe eyan kiriye:

**Vejîne zimanê xwe, ey xwendevan**
**Nebûye milet hîç kesek bê ziman**
**Zimanê me xweş û xuroş û ciwan**
**Eger baş bizanî tu nakî ziyan**
**Tu Kurmanciya xwe ji bîr nakî**
**Eger baş nizanî, divê zêde kî ….**

Cigerxwîn cuda ji afirandina 8 dîwanên xwe yên welatparêzî, şoreşgerî û evîndarî bo gelê Kurd ku rêya rewşenbîrî, mirovanetî, aştîxwazî û wekheviyê nîşanê gel da, her di vê demê de jî helbestvanekî Enternasyonalîst jî bûye û vî baweriyeke mezin bi azadî, aşitî û birayetiya navbera gelan hebûye.

Ev helbestvan û mirov hezê mezin di sala 1984 an de, li welatê Swêdê di xerîbî û hesreta azadiya Kurd û Kurdistanê da çû ber dilovaniya xudê. Cigerxwîn li cihê xwe da ev xizîna dîwanên xwe ku dermanê kul û derdê gelê me ne, bo me bi cî hêlan.

Lewma hewceye gelê Kurd xwe bextever bizane ku helbestvanek mîna Cigerxwîn bi xîret, dilsoj û Kurd perwer hebûye û vê heta hetaye nav û ramanên Cigerxwîn bi qedr û qîmetek mezin wa di nava dil û mejiyê xwe de biparêzin.

## Gotinên Mezinan

❍.Her dem tiştê xirab, bi xirabî û tiştê baş bi başî dibîne, bêy vê ku tu bizanî xwediyê vê kê ye.

❍.Ne hinde hişik be ku bêyî şikandin, ne jî hinde nerm be ku wekî berikê bêyî bêçandin.

❍.Ne mehtê tiştekê bike, ne jî dijûna jê re bide.

❍.Rêncberê xwe be, axayê mala xelkê nebe.

❍.Şola bike bi esas, bila dilê te nebe weswas.

❍.Ev dostê te ye ku te digirînît nek evê ku te dikenînît.

❍.Karê îro nehêle sibê re.

❍.Xwe mezin neke, da ku tu neşkêyî.

❍.Hindikê bide ber dasê, bila tu nemînî asê.

❍.Nebe kevçiyê hemû girarekê.

❍.Bidî biyanî, goştê ranî, vê li ser te da bihêt poşmanî.

❍.Tu çi biçînî, tu vê dihilînî.

❍.Nan bidî segan, belê nedî bê sifetan,

❍.Nanê tirsiye xwe nede goştê bi mineta xelkê.

❍.Heta kanî hebe, ava cihê nevexwo.

❍.Bo biyanî çende bikî, li dûmahiyê her poşmanî.

❍.Ne Gamêşê bike Mêş, ne jî Mêşê. bike Gamêş.

❍.Here nav miletan, bila bigrî adetan.

❍.karê demekê, ne de axifitina salekê.

❍.Tişta Aqil qebûl neke, bawir neke.

www.arsivakurd.org

# Vehandina Hozana Kurdî

Çengîz Temeryan



Dîroka hozanê vedigere ser dirêjahîya pêkhatin û hebûna ziman. Hem mirovên destpêkî û hem mirovên medenî, di hemû devranan da ev bi kar anîne û di hemû welatan da hozan gotine û xwandine. Di wê navberê da ev pirsyare dête holê ku çima hozan hatiye û hozanvanan bo çi mebesteké divehîne?
Derheq wê pirsê bersivên cur bi cur hene, yek ji wan bersivan eva hane ku hozan sehekê ji jînê didete mirovan. Me wek civatekî sivîl pêdvîyekî gelek hindurî bi wê çendê heye ku em bi canekî pir bûy, kûrtir û baştir bijîn.

Kakila hozanê tecrube ye, hozanvan paşkokên zanînên pêştir, ku ji wê jî pêştir seh û dîtin û têfikirîn hilbijartîye bi hevre girê didet û zanînên nû di ziman da diafirîne ku ev jî di çarçovekî dîyarî kirî da dihên formole û rêxistin. Xala herî bihagiran di vê afirandinê da eva hane ku di wê ser û bendê da xwandevan jî dê bikarît ji wê zanînên nû da pişikdar bît û mifahê ji wê vergirît.

Bi vî awayî hozanê du mijar hene, di destpêkê da dikare wek amrazekê bi kar bihêt, ku heta zanînên me ên çandî û edebî, zimanvanî baştir û kûrtir biket û tevî rewş û kawdanên niha webir bin. Ji alîyê din ve mîna neynûkekê tim zanînên me di nav wê da saf û temîz bin, anku kakilekî xwedî mifah hebe û kesên din bikarbin vêcê jê wergirin.

Serdemê Impiratorîya Usmanî û Şahê Sefewî serdemê geş û xurt bûna çanda Kurdî bûye. Lê hozana Kurdî çavan e û Kurdan ji kengî were dest bi vehandina hozanê kirine?

Heger bi hûrî em bal û deyna xwe bidin dîroka Kurdistanê, ya ku niha li ber destan daye dê ji me re ron bît ku hêjî dîroknas û edîban nekarîne dîroka serrast a hozana Kurdî peyda bikin, li gor dîrokê hozanvanên herî mezin ên Kurdan di çaxê desthelatdarîya Impiratorîya Usmanî û Şahên Sefewî da peyda bûne. Netewa Kurd xwediyê dîrokekî kevnar û tijî xebat û berxwedaniyê ye dijî hemû rijîmên ku Kurdistan dagîr kirine, bi taybetî evên ku bi merema tepeser kirina vî gelî li ser çand û kultora netewa Kurd rêkeftine. Dujminên gelê Kurd di pêvajoya dîrokê da çi gavekê xemsarî ji bo binbir û bin ax kirina gişt warê rewşenbîrî û edebî û çandî û rûyên bajêrvanî a gelê Kurd nekirine. Bo nimûne şewtandina Pirtûka Mem û Zîn a Ehmedê Xanî di Stenbolê da. Lê bi her terzê heyî, hin berper ji wan berperan di nav çengên wan da derkevtin û ronahî dîtin, wek Şerefname ya Şerefxanê Bidlîsî ku serbora Kurdistanê di warên (siyasî, civakî, edebî, çandî)di wê da bi zimanê Farsî hatiye nivîsandin. Lê evên din hemû bi destê bîhanîyan û bi dilê wan û li gor qazancê wan û bi merema veşartina warê rewşenbîriya Kurdî hatine nivîsandin. Di serdemê Mîrên Kurdistanê de hozana Kurdî heya qasekê di hewayekî serbest da hatiye vehandin, çi evên ku wek pirtûk hatine nivîsandin an dev bi dev hatine parastin heta gihîştine vî serdemî: Wek Şerefxan di bêjît: Di serdemê Cizîrî da Mîr Şeref Mîrê Cizîrê bûye û cizîrî du parçe hozan jê re gotiye.

**"Ey şahen Şahê moezzem, heq nigehdarê te bî**
**Soreyê îna Fetehna devr û berê te bî "**

Û paşê sibêjît:

***"Ne tinê Tebrîz û Kurdistan li ber hikmê te bin,***
***sed wekî Şahê Xurasan di fewarê te bî"***

Belê hozana Kurdî vedigere berî mîrên Kurdistanê ku diyare dagîrkerên Kurdistanê nehêlane dîroka wê bi awayekî kilasîkî ku hebûye were nivîsandin û parastin.

# Penaberî

**Xebat**

Bi hezaran sala mi di go, ez li virim û ji vir naçim
Axê jî di go bindestî zore, bê te ez jiyan nabim
Min ji dar û gul û kulîlka re got, şalûl û bilbil û bazim
Ji dîrokê heta niha, serê min bilinde , xem tinê îro jar û belengazim
Destê min ji te nabe welat, ez dev ji te bernadim
Ji aşûr heta niha şûr li destê mine, her û her wî di badim
Ez lawê kurd nevîyê kawa, zerdeşt û rostemê zalim
Xwedan dîrok û hunerim, jîrim ne nezanim
Tim ji bo te welatê min , bi ahîn û keser û fixanim
Rûpelê dîrokê weke,,ez her bi kuştin û talan û fermanim
Lawê kurdim ez, xwedanê laliş nûranî, û kurdistanim
Aşûr, Ereb û Tirik hatin, bi min nikarîbûn, ez ne helandim
Ji bo berjewend û mafên xwe, nefî kirim, li gelek cîya gerandim
Lê kesî bi min nikarîbû, ji reh û kokê, ez neqetandim
Bi fin û xap û dirava, ez vê carê xapandim
Lê sed heyîf sed mixabin,ji welat dûr kirim
Rehê dilê min kolan ,ji nav de ez hejandim
Gelo çi bû hat serê min,ez li parîs û berlînê gerandim
Bi çend hêvîyên pûç û vala , ji nav de wan ez hejandim
Ka welat,ûrif û adet , vê carê te ez mirandim (Penaberîyê)

www.arsivakurd.org

# Feqiyê Teyran dengê Kurdistanê

Kurmanc Hakkî

**Ey avê avê avê av**
**Ma tu bi eşq çû mehbet î?**
**Mewc û Pêlan tavê belav**
**Bê sekne û bê rehet î**
**Bê rehet û bê sekneyî**
**Yan aşiqê baxuwê xweyî**
**Yan şubhetê qelbê meyî**
**Ji eşqa kî natebitî?**

Ew bikra evînê ya ku berî çarsed salan di nav dilê Feqiyê Teyran de dabû der û bi evîna Melayê Cizirî û Seydayê Xanî re tev de bûbû çemekî bi hêz, ku îro jî bi hemî coş û zelaliya xwe ve diherike û wekî şêlaleyeke ji ava heyatê bi ser dilên evîndaran dibare.

Ev ava pîroz zada jînê û tilisma vejînê ye, ku her dilopek vê avê ji nav dilê siruşt û şehrezahiya Mezrabotan nisiliye û li zozanên Kurdistanê daye der. Her kesê ku qurtek ji vê avê vexwariye gianek nemir bi dest aniye.

**Ji eşqa kî her tê û tê**
**Heta kengê her bê û bê**
**Bo min bêje heyranê kî yî?**
**Da ez bizanim Qesetê**
**Da ez bizanim vê sirê**
**ji hindikê heta pirê**
**Ji min meiniya vê gurgurê**
**ji kê ra dikî vê ta'etê?**

Şêxê Senanî yan Feqiyê Teyran yek ji her sê situnên toreya Kurdî ye. Ev hersê giregir û rêzanên hîmê toreya Kurdî, Cizîrî, Teyran û Xanî ne.

Şêxê Senanî stranek bê dawî honaye ko ev çend sed sale li ser xaka Kurdistanê deng vedide. Teyr û tilûrên Kurdistanê timî bi zimanê Feqiyê Teyran diaxivin û bi stranên wî radizên û radibin. Şalûl û bilbilên Kurdistanê mehbeta xwe ya li gel gul û sosinan bi helbestên Feqî direngînin û dixemilînin.

**Min diye muhbet çi reng e**
**Suht e, dijwar e, pereng e**
**Min mudam dil jê beheng e**
**Bi nalîn û efxan im ez**
**Nalîna teyr û tuyaran**
**Kalîna çeng û bilûran**
**Xulxulîn di qesr û qusûran**
**Bilbilê xweşxan im ez**

Li Kurdistanê tu kevir, tu av, tu dar û tu ajal nînin ku bi zimanê Feqiyê Teyran nizanibin. Feqî zimanê Kurdistanê ye û Kurdistan jî evîna Feqî.

Di nav gelê Kurd de gelek gotin û mesele li ser Feqiyê Teyran têne gotin. Di nav van gotin û meseleyan de mirov dikaribe hemû rengên mirovanî, dilpakî û dilsoziyê bibîne.

Fêqî mirovek dilpak bûye û xwastiye ku cihê ku ev lê dijît tu neheqî lê çi nebe û kes heqê



kesê nexot. Bo vê yekê jî gelek digere hetanî di gundekê bi navê Şandîsê li devera Bidlîsê mala xwe ava dike û hetanî dawiya temenê xwe vêrê dimîne. Gundî pir hejî Feqî dikin û wî wek mirovek pîroz û muqedes di bînin. Tê gotin dema Feqiyê Teyran diçe dilovaniya Xudê, gundiyên wî ji Wezûzê ku gundekî nizîkî Miksê ye, têne gundê Şandîsê ku termê Feqî bibin li Werzûrê bispêrin axê. Lê Şandîsî vê yekê qebûl nakin û dibêjin ku ewê Feqî li gundê xwe veşêrin.

Li ser vê yekê gengeşe li navbera her du aliyan de çê dibe. Melayê Şandîsê radibe û du tabûtan dide çêkirin û ji her du aliyan re vî tiştî di bêje: "Herin ji xwe re binivin; dema bû sibeh rabin hûne li mizgevtê du tabûtan bibînin. Lê divê her aliyek ji ber xwe ve bê deng rahêje tabûtekê û bibe."

Gel vê gotina mela qebûl dikin û diçin dinivin. Serê sibê hem Werzûrî û hem jî Şandîsî diçin her yek radihêjine tabûtekê û radikin. Her du alî jî dema tabûtê radikin dinêrin ku tabût tijiye û Werzûrî jî Şandîsî jî dibin her yek gorekê çêdikin û tabûtë datîninê.

Bi vî awayî îro li gundê Miksê Werzûrî jî û li gundê Hîzanê Şandîsê jî gora Feqiyê Teyran heye. Lê gora Feqî ya rastî kîjane kes baş nizane. Her du gorên Şêxê Senanî îro jî ziyaretgeh û cîhê pîroze Kurdane. Niha jî xelkê devera Wan û Bidlîsê hemû salê li Tîrmehê de hemî eyiniyan diçin ser gorên wî yên pîroz û rojên Feqiyê Teyran bi cejn û şahî di bin ser.

**Ez çi bêjim çi beyan kim**
**Mexfiyatan ez eyan kim**
**Sirê dilê eşkera kim**
**Kes bi halî min nezan**
**Çendê bejim sir û halan**
**Ah ji destê çav xezalan**
**Her dinalin mah û salan**
**Kes bi halê min nezan**

Helbest û dîwanên Feqiyê Teyran gelek bi kêmî hatin berev kirin. Cara yekem dîwana Feqiyê Teyran li Bexdayê bi tîpên erebî ji aliyê Seîd Derwêşî hate berhev kirin û di sala 1999'î de Enîstîtoya Kurd li Stenbolê dîvana han bi navê ***"Ey avê av"*** bi pîtên latînî weşandiye.

**Dil ji min naket xeyalan**
**Bûme perwana şemalan**
**Bêriya husn û cemalan**
**Ay dilê min ay dilo**
**Can fîrêtim te nebînim**
**Deftera eşqê bixwînim**
**Serxweş û sukran û dînim**
**Ay dilê min ay dilo.**

www.arsivakurd.org

# Xatûna Şîrîn Ebadî û wergirtina Xelatê Nobel a Aştiyê (2003)

**Azad Kurdî**

Xelatê Nobel a Aştiyê îsal gihîşte parêzvana mafê mirovan Şîrîn Ebadî. Komîteya Nobel li Oslo, xelatê Nobel a Aştiyê li sala 2003an bi sedema xebata wê ji bo parastina mafê mirovan (bi taybet mafê jin û zarokan) û demokrasiyê li Îranê de bo wergirtina vî xelatî hate hilbijartin.

Piştî berbijêr kirina Rêberê şehîde PDK Îranê, Dr. Ebdulrehman Qasimlo bo wergirtina wî xelatî di sala 1989 Zayînî de ku yekem Îranî û yekem Kurd bû ku ji bo Xelatê Nobel a Aştiyê hatibû berbijartin, Şîrîn Ebadî û Haşim Axacarî duyem Îranî yên berbijarê xelata Nobel a Aştiyê bûn. Ebadî 11mîn jina cîhanê û yekemîn jina Misilman e ku kariye wî xelatî bi dest ve bîne.

Wê piştî ku nûçeyê xelat kirina xwe bihîst, ragehand, ku ev biryar ji bo mafê mirovan li Îranê û bi taybetî ji bo zarokan tiştekî giranbiha û hêja ye.

Ebadî Parêzvan, nivîskar, memostayê zanîngehê, vekolînker û xebatkarê civakî û mafê mirovan li 31 Cozerdana 1326 Rojî (1947 Zayînî), ji dayîk bûye. Niha temenê wê 56 salî ye. Sala 1347 Rojî (1969 Zayînî), yekemîn jin bû ku li Îranê bû dadmend. Lê piştî serhildana sala 1979'an û bi deshilat gihîştina Komara Îsalmî ew hate neçar kirin ku dest ji wî karî ber bide. Li gor Qanûn (zagona) bingehîne Îranê jin li hin aliyên jiyan û têkoşîna civakiye xwe ji mafê beramber weke mêran bê par in. Mîna rênedana xebata wan bo dadmendî yê, hilbijartin bo Serok Komariyê û hin çalakiyên din, ji wan bê pariyane ne. Di civaka Îranê de deshilat û yasa bi awayên cur bi cur sivikatiyê bi kesayetiya jinan dikin û ev li mafên mirovî û azadiyên sereke bê par kirin e.

Nûçegihanê fermiye Komara



Îslamî a Îranê, ÎRNA, nûçey dana xelatê Nobel a Aştiyê bi Şîrîn Ebadî, bi kurtî û zor ji direng weşand. Ew vê kiryarê bi pîlana dijminan û **"îstikbar"**a cîhanî dizanin!

Ji aliyek din rayedarên Îranê xelatê Ebadî bi nîşaneya pişkdariya zaf xurt a jinên Îranî li rojeva siyasî û civakî dizanin. Lê vê rastiyê ji bîr dikin ku navhatî ji ber beyan kirina hizr û ramanên azadîxwazane û berevanî ji mafê mirov, azadî û demokrasiyê çend car ji aliyê wê rejîmê ve hatiye girtin û mehkeme kirin. Hejî gotinê ye, wergittina xelatê han ji aliyê Ebadî ve bo tevgera azadîxwazane ya gelên Îranê serkeftinek mezin e.

Ebadî Xelatê Nobel a Aştî ya îsal ku qîmeta vê 1 milyon û 300 hezar Dolar e, tevî mîdala şanaziyê werdigire. Ji girîngtirîn û navdarên mezin e berbijêre wergirtina wî xelatî "Pap Jan Polê duyem" Serokê Katolîkên cîhanê, Watslaw Habil Serok Komarê welatê Çik û Lix Walsa Serok Komarê pêşîne Lehistanê bûn.

**Wergirên xelata Nobel a Aştiyê di çend salên bihorî de evanê jêrîn in:**

2002: Cîmî Kartir Cunyor, Serok Komarê pêşîn yê Amerîka

2001: Kofî Enan, Sekreterê Giştî yê Neteweyên Yekbûyî

2000: Kîm Daê Cong, Serok Komarê berê ye Kureya Başûr

1999: Rêxistina Duktorên bê sînor (MSF, li welatê Firanse)

1998: Can Hîyom û Deywîd Tirîmbêl li Îrlenda Bakûr

1997 Rêxistina Navnetewî a mîn gilgirtinê, bi serokatiya " Codî Wîlyamz"

. . .

## Îran mezintirîn girtîgeha rojnamevanan

Rapora salane ya saziya nûçegihanên bê sînor, Komara Islamî ya Îranê tevî 6 welatên din wekî wan dewletên mezin nav bir ku azadiya weşanê di van da bi rijdî tê pelçiqandin.

Ev rapore ku li Parîsê belav bûye, gotiye Komara Islamiya Îranê di bin pê kirina azadiya weşanan û mafê rojnamevanan de li navbera 166 welatên dinê de, li refa 160ê de cih girtiye.

Li gorî vê raporê di sala 2002an de 16 welat di qedexe kirina weşan û tepeser kirina rojnamevanan de ji Komara Islamî pêştir bûn. Di halekê de di rapora salane ya 2003'an de hatiye dest nîşan kirin ku tenê 6 welat li pêşiya Komara Islamî mane. Li dirêjiya vê raporê de hatiye ku kes nikare li welatên mîna: Kureya Bakûr, Birme, Laos, Çîn, Îran, Tirkmenistan û Viyetnamê de rojnameyek serbixwe hebe. Rojnamevan di van welatan de ji çi mafekê xwedî par ninin û bo kar û canê van jî çi tenahiyek tu neye û ev neçar in di rewşekî herî ne baş de bo karê rojnamevanî û gihandina zanyariyan bixebitin û hejmareke zaf ji rojnamevanan bi xasmanî di girtîgehên welatên weke: Birme, Çîn û Îranê de hepsî ne. Saziya nûçegihanê bê sînor, Îran weke mezintirîn giretîgeha rojnamevanan di Rojhilata Navîn de daye nas kirin.

**Jêder: Radyo Ferda**

www.arshivakurd.org

# Derheq cinayeta nû ya terorîstî li bajarê Kerkûkê

Li gor ragehandina Melbenda Rêkxistina Kerkûkê ya Yekîtiya Nîştimanî a Kurdistanê, demjimêr 13:30'ê pêşnîveroya roja şemî 20.11.2003'ê, di kiryareke terorîstî de du otombêlên curên "**NISSAN**" li çar riyên hember baregeha Melbenda 2' ya Rêxistina Kerkûkê ya YNK'ê de teqîn ku tê gotin ku pitir ji 100 kîlo **TNT** û guleyên topan tê de hatibûn bi kar anîn. Di encamê de 4 kesan jiyana xwe ji dest da û 33 hevwelatiyên Kurd, Ereb û Tirkman ku pişkek ji wan zarok bûn û ji xwendingehê dizivirîn hatine birîndar kirin. Ev teqîne di çaxekê diqewime ku qirar bû Balyozê Watîkanê di vê rojê de bihê Kerkûkê û **Metranê** nû yê Kerkûkê dest nîşan bike.

Her çi qas xelkê Îraqê zêdetir ji wê rojê nêzîk bibin ku deshilat di wî welatî de bi yekcarî bikeve destê nûnerên hilbijartiye wan, nigeranî û tengijiya dijminên cêhgir bûna aştî û azadî û demokrasiyê di vî welatî de zaftir dibît. Evan çavên dîtina cêhgir bûna aştî, tenahî, asayîş û azadiyê bixasmanî li Kurdistanê nine, ev rastiya han jî ku bo cara yekemîn di dîroka Îraqê de Kurdek serokatiya wî welatî diket wisan jê kiriye ku bixebitin Kurdistanê jî bikene qada xulqandina cinayet û cî bi cî kirina nexşeyê terorîstên xwe.

PDK Îranê, kiryara nû ya terorîstî li Kerkûkê û hemû cinayet û kiryarên terorîstî ye wan li her ciheke Kurdistan û Îraqê bi rijdî şermezar diket û tevî beyan kirina serexweşiyê, hevderdiya xwe tevî malbata goriyên vê cinayetê jî beyan diket û silametî û baş bûna zû ye birîndaran bi hêvî dixwaze. Her di vê demê de jî daxwazê ji Partî û Rêxistinên Kurdistana Başûr û akinciyên vê pişka Îraqê dike ku bi hişyarî û hevgirtina xwe, pîlanên dijminê aştî û azadî û demokrasiyê di Îraqê de bê encam (pûç) bikin û pêşiya dubare bûna wan cure kiryarên terorîstî bigirin.

# Şandeke Partiya Demokrat seredana Wezîrê Derve li hikûmeta pêşeroja Ustiraliyayê dikin

Roja 18.11.2003'an Şandek ji endamên partiy pêkhatî ji hevalan: Selah Pûr Esed, Mesûd Pîran û Osman Senbolî li bajarê Birîzbanê tevî birêz Kîvîn Rod (Kewin Rodd) Endamê Parlemana Federal ya Ustiralyayê civîyan. Kîvîn Rod berpirsyarê penaberên derve yên Parta Karkerên Ustiralya ye û Wezîrê Derve yê Partê li hikûmeta pêşeroja a Parta Karker e.

Şanda Parta Demokrat di berahiyê de basa rewşa Îran, terorîzma Komara Islamî, tepeser kirina gelê Kurd û bin pê kirina mafê mirovan kirin. Paşan lîsteyek ji navên wan kesên ku di vê dawiyê de bi destê rijîma Komara Islamî hatine kuştin, dane birêz Rodd.

Li dîv re li ser girtin û bi dest dana 6 xebatkarên demokrat bi Komara Islamî ji aliyê Bizava Îslamî a Kurdistanê ve, axivîn. Her wisan qala der çûna hikmê îdamê bo Ramîn Şerîfî, endamê PDK Îranê û girtina çend kes ji xebatkarên PDK li herêma Mehabadê bo birêz Rodd kirin û di wê derheqê de daxwaza alîkariyê ji wî kirin. Kîvîn Rodd tevî beyan kirina hevsozî û hevderdiya xwe tevî bizava gelê Kurd soz da ku di riya xwe we cehd û bizavê bidet ji bo ron û zelal bûna qeder û çarenivîsa girtî û bê ser û şûn kiriyên Parta Demokrat û pêşgîrî kirin ji rêveçûna hikmê îdama Ramîn Şerîfî. Piştre basa endam bûna her du Part (PDK Îranê û Partiya Karkerên Ustiralya)yê di Entirnasyonala Sosyalîst de û pêdivî û hevce bûna pitire alîkariyan di navbera wan du Partane de hate kirin.

# Evîna min kê tu êşandî

Sadiq Eskerî

Min divêt te hergav
hembêz kim,
min divêt mîna çîyan
ku ba hembêz dikin
ji tere bibim şemala kore rêyan.

Evîna min kê tu êşandî
wî zarokê zik birsî û êtîm, yan
minê evîndarê bê guneh

Evîna min ma tu nizanî
ez û tu û ev zarokê
zik birsî û êtîm, ji
yêk can in û ji bo
yêk merem dimirîn û dijîn

www.arsivakurd.org

## Ebdula Hesenzade, Sekreterê Giştiyê PDK Îranê, bû berbijarê wergirtina Xelatê Fond ya bîr anîna Olaf Palme




Ji Fonda bîr anîna Olaf Palma û bi navê Yuwakîm Îng Kust )Yoskim Engqvist) ve bo birêz Hesen Qehremanî, berpirsyarê Têkiliyên Partiya Demokrat li Swêdê:

Bi vî awayî, we agehdar dikin ku berbijar kirina rêzdar Ebdula Hesenzade di civîna desteya serokatiyê de hate ber bas û rawêj kirinê û piştî vê behs û rapirsînê Ebdula Hesenzade hate berbijar kirin.

Desteya Serokatiyê vê di demsala Payîzê de li ser wî kesî/ê ku xelatê Olaf Palme bi vî bihê dan, biryara xwe ya dawîn bide û piştre dê daxuyaniya çapemeniyê di wê derheqê de bihê weşandin.

Tevî rêz û silavan
Yuwakîm Îng kust (Yoskim Engqvist)
Fonda bîranîna Olaf Palme
(Novambra 2003

# Hilatina mejiyan li Îranê ??

**Enbê**

Demekê berî niha Xizîneya Navnetewî a dirav (Pere), di serhijmêriyekê de da zanîn ku Îran di nava 91 welatên ne pêşketiye cîhanê de yekem e!

Ji gorî vê serhijmêriyê di salê de 150 heya 180 hezar kes ji xwendevanên Îranî welatê xwe bi cih dihêl in.

Belavoka ***Bername*** ser bi rêxistina Bername û Budce ya Komara Islamî nivîsand ku: "90 kes ji wan 125 kesên ku di sala bihorî de li Olempiyadên zanistiye cîhanî serkeftin bi dest ve anîbûn, niha li zanîngehên Amerîka de dixwînin."

Em dikarin azadiyê di her welatekê de bi giştî li ser 2 aliyên bingehîn pişk bikin: 1. Azadiyên Siyasî (mîna beyan kirina hizr û ramanên siyasî, pişkdarî kirin di pêşeroja siyasî ye welêt de) 2. Azadiyên civakî (mîna wekhev bûna hemû xelk di warê Nejad, ol û baweriya wan de).

Sedemên hilatina nifşa avedanker û çêkerê pêşeroja welat li tu kesê veşartî nine. Li serdemê deshilatdariya Şahenşahî li Îranê, azadiyên civakî hetanî qasekî zor hebûn, lê azadiyên siyasî tu nebûn, her bi vê sedemê xelkê neyar û dijebere siyasetên dewletê koçberî welatên din dibûn. Piştî serkeftina serhildana gelên Îranê li sala 1357'ê Rojî (1979 Zayînî), li gor vê pîvana ku me di serî de bas kir, him azadiyên siyasî û him jî azadiyên civakî li xelkê hatin berbest û qedexe kirin. Rewşa han bo ciwanên azadîxwaz e Îranê nehatiye qebûl kirin.

Goriyên esliye wê pirsgirêkê nifşa ciwan in. Kiryar û siyasetên çewt û xirabe Komara Îslamî a Îranê di zanîngeh, xwendingeh û ciavkê de tevî ciwanan ev rewşe afirandiye. Îro rojê nebûna kesên pispor û jêhatî li hemû dezgeh û îdareyên welat de tê dîtin.



Rayedarên rejîmê 24 sal e dibêjin dibe sebebên wê pirsgirêkê bihên ber lêkolîn û çareserkirinê! Lê bi rastî rewş li vê çendê aloz û xirabtir e ku ev rêçarên ku karbidest û rayedarên rijîmê pêşniyaz dikin, bikarin vê nesaxiyê derman bikin. Ev girêpêçkane tenê bi nemana Komara Islamî û cihgir bûna hikûmeteke pêşkeftî û demokratîk, bihên çareser kirin.

Li derweyî welat alîkariyên maliye xwe bo Parta Demokrata Kurdistana Îranê bidne wê hisaba bankî:

C.C.P PARIS 68040
M020
FRANCE
Fîşeya bankiye vê jî bo vê adresê Poste bikin:

A.F.K.B.P.102 75623
PARIS CEDEX 13
FRANCE

Hejmar Telefon û Fax
A pêwend girtin bi Radyo Dengê Kurdistana Îranê re:

**Telefon: 00871762280073**

**Fax: 00871762280074**

www.arsivakurd.org

# 22'mîn Kongireya Entirnasyonala Sosyalîst dawî bi karên xwe anî

Di rojên 27,28 û 29'ê Oktobra 2003'e Zayînî de, bîst û duyemîn kongireya Entirnasyonala Sosyalîst li bajarê ***Saopolo*** ya welatê Birizîlê hate li dar xistin. Di vê kongirê de zêdetir ji 140 şandên noneratiyan li seranserê cîhanê tê de pişkdarî kiribûn.

Ev pirsên ku di kongirê de ketine rojevê, pêkhatî bûn ji pirsên bihagirane cîhanî mîna: Pirsa xurt bûna berdewam û ewlekariya cîhanî, rolê nû yê Civata Navneteweyî anku Rêxistina Neteweyên Yekbûyî û hewcehiya pêkanîna guhertinên baş di vê rêxistinê de, bazirganiya navnetewî û pirsa cîhgir kirina wekhevî û edaletê di bazirganiyê de û her wisan pirsa kar û jîngehê, cehd kirin bo zeliqandina aştiyê di rêya pêşgîrî kirin li şer û çareser kirina alozî û pirsgirêkan, birsîtî û dadmendiya civakî, zêde kirina nexş û rola hevwelatiyan di rêya bi hêz kirina Rêxistinên Demokratîk di civatgeha bajêrvaniyê de.

Parek din ji kar û xebatên kongirê pejirandina "Sened" û biryarnameyan û hilbijartina rêveberî û berpirsên saziyên cur bi cure Entirnasyonala Sosyalîst bûn ku pişkek ji wan evane bûn: Rapora Sekreter bo Kongirê, biryarnameya giştiye Kongira 22'yan bi navê ***biryarnema Saopolo***.

Parek din ji rapora Sekreter bo kongirê, taybet bû bi pirsa Kurd û çelengî û têkoşîna Entirnasyonala Sosyalîst di vî warî de, her wisan kongireya 22 ya Entirnasyonala Sosyalîst di biryarnama xwe de biryarnameyek jî derheqî Îranê pejirand.

Şanda pişkdare PDK Îranê pêkhatî bûn ji hevalan: Xusro Ebdulahî, Berpirsê Buroya têkiliyên Partiyê li derveyî welat û hevalê Xalid Ezîzî nonerê Partiyê li Amerîka.

Şanda partiya me di vê kongirê de tevî hejmarek kesayetî û şandan derheqî pirsên cîhanî bîr û hizrên xwe guherîn û nameyek pêşkêşî kongirê kirin.

Di vê namê de piştî şîrove kirina rewşa Îranê, daxwaz ji Entirnasyonala Sosyalîst hate kirin ku piştgîriyê ji xebata xelkê Îranê bikin, ku bûye sedema pejirandina biryarnameyekê derheqî Îranê de.

Hejî gotinê ye ku di nava partiyên Kurdistanî de, ji bilî PDK Îranê, PDK Îraqê, YNK'ê û Partiya Demokrasiya Gel (Tirkiyê) pişkdar bûn ku her di vê kongirê de YNK'ê U Partiya Demokrasî ya Gel bi endamê zêrevan (çavdêr) di Rêxistina Entirnasyonala Sosyalîst de hatin hilbijartin.

**Biryarnameya Kongira 22'mîn a Entirnasyonala Sosyalîst derheq Îranê:**

-Em daxwazê ji hemû hêzên alîgire Demokrasî û mafê mirovan di Îranê de dikin ku hewl û bizavên xwe ji bo guhertin û çêkirina (reforman) di Îranê de bidomînin.

-Binpê kirina eşkere û eyane mafê mirovan û azadiyên demokratîk ku ji aliyê neyarên demokrasî û guhertinan di Îranê de tê kirin, em bi tundî şermer dikin. Hejmarek ji wan kiryarên dîktatorane evane ne: Girêdana Rojnameyan, girtin û dest bi ser kirina rojnamevan, rewşenbîr û xwendevanên alîgirê pêkanîna guhertinan û dana hikmê îdamê, bi xasmanî li dar vekirina xebatkar û şoreşvanên Kurd.

- Em serkût û tepeser kirina Kurdan di Îranê de mehkûm dikin û ji bo çareser kirina pirsgirêka Kurdan li Îranê bi rêya atîxwazane û dan û standinan radiwestin.

-Em daxwazakarê azadia hemû girtiyên siyasî û baweriyê û ji nav birina her terze ferq û cudahî danenekê ne ku Jin li Îranê de bûne goriyên vê natebahiyê. Her wisan em daxwazkarê berçavgirtina wekheviya mafê Jin û Mêran di hemû warekê de ne.

Bo xwendina weşan û belavokên PDK Îranê û wergirtina zanyariyan derheqî hizbê, mêzeyî wan adresane li ser Înternêtê bikin:

www.kurdistanmedia.com
http://www.pdk-iran.org

**e- mail:**
info@kurdistanmedi.com

pdkiran@club-internet.fr

www.arsivakurd.org

agirî

**Rojnameyeke siyasî û çandiye, Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne**
**Hejmara 1, Sermaweza 2003**

**Navnîşan:**
AFK
B.P. 102- 75623 Paris
CEDEX 13 –FRANCE

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci.htm

**Email:**
**Rojnama_agiri@yahoo.com**

**Agiri2003@hotmail.com**

Fax: **0012703425105**

**Bo Agirî binivîsînin**

Eger bo Agirî dinivîsin ji kerema xwe van xalên jêrîn berçav bigirin:
* Çi nivîsek bê nav û nîşan nayê weşandin. Nivîskar dikare navê dilxwaz bo nivîsa xwe hilbijêr e, Digel navê dilxwaz ji kerema xwe navê xwe yê rastî bo rojnamê bişînin.
* Eger nivîskar ji bo nivîsîn û berhev kirina mijara xwe ji çavkaniyan mifah wergirtibe, hewce ye îşare bi van jêderan biket.
* Ev nivîsên ku li zimanên biyanî hatibin wergêrandin, hewce ye îşare pê bê kirin û nav û nîşana jêderê jî bihê dest nîşan kirin.
* Hindî bikarin wêne, xerîte û belgenamên hewce tevî nivîsan bo me bişînin.

**Desteka nivîskarên Rojnameya Agirî mafê vê çendê heye ku:**

- Destêwerdana rênûsa nivîsan biket.
- Wan mijar û babetên ku naverokek lawaz hebin belav neket.



## Cejna Remezanê pîroz be

Hejmara 1'e Agirî hev dem tevî hatina cejna pîroze Remezanê der diçe. Bi vê sedemê em pîrozbayiyê ji tev Misimlanên Kurdistan, Îran û cîhanê dikin cejnek xweş û şa bo wan bi hêvî dixwazin.

Em hêvîdar in ku ev cejne jî weke hemû cejn û boneyên olî û neteweyiye akinciyên Kurdistanê, bibe keys û derfetek bo ji hev nêzîk bûna zêdetire refên xelkê û xurttir bûna tebahî, biratî û canê bi hevre jiyan û alîkarî di navbera peyrewên oly û ayînên cur bi cure Kurdistan de.

---

## Sedsaliya ji dayik bûna Cigerxwîn pîroz be

**Sîtavk**



**Mamosta Cegerxwîn bi hevîna xwe re**

Eger em bixwazin vî helbestvan û zanayê mezin û nemire neteweya Kurd bi başî nas bikin û bizanin ku kê bû, çawa jiya û çi kir? Renge karê çend pirtûk û lêkolînên cuda cuda ên pispor û şahrezayên vî warî be û em nekarin di mijarekî kurt de aliyên cur bi cure jiyan û xasmaniyên vî hozanvanê mezin û navdare gelê xwe bidine naskirin. Ev jî şayîrek ku temenê tejî ji afirandine wî weke gul û kulîlkekê bû ku li nehatî û dêmistana bindestî û belengaziya Kurd û Kurdistanê de, bişkivîbû û mizgîniya bihara jiyanê û banga xebat bo gihîştin bi azadî û serbestiyê dida gelê Kurd.

Lê emê cehdê bikin vê mijarê de hinek ji xasmanî û afirandinên vî nemirî, ku wekî xizîneyeke tejî li durr û cewahirat û baxçeyeke tejî li gul û çîçeke, bêxîne ber çavê xwandevanên hêjaye Agirî.

Navê rastîne Cegerxwîn, **Şêx Mûs** bûye û di sala 1903'ê de li malbatek belengaze gundê **Hesar** ser bi bajarê Mardînê, li Bakûrê Kurdistanê hatiye dinê. Para zore temenê zarotiya vî bi şivanî û gavaniyê derbas bûye û tevî rêncberiyê kariye bi xwendina olî, îcazenameya meletî (îmam)yê wergire û bibe mela. Paşê dest ji meltiyê berdaye û ketiye nava jiyana cotkariyê û ji ber zordariya Axa û Began û ne wekheviya civakê çi xêr û xweşiyek nedîtiye û her tim li gund û bajarên Kurdistanê da koçber bûye û paşî tewaw bûna şerê yekeme cîhanî û parve kirina Kurdistanê ji aliyê dijminan ve, li **Amûdê** a Kurdistana Sûryê cîwar bûye. Ji ber ku di jîna xwe da gelek rojên dijwar li qewmîn û êxsîrî û derbideriye gelê Kurd û kawil bûn û parve kirina Kurdistanê bi çavê xwe dîtiye, dil û hinav lê şevitîne û bi navê **Cigerxwîn** weke şayîreke xemxur û dilsoj, bona kul u derdê Kurdan xebitiye. Evî bi helbestên xwe, rêya: zane bûn (xwendin), yekîtî û şoreşgeriyê nîşanî gel daye û xwendinê weke kilîla rizgarî û serbestî û melhema derman kirina birînên bindestiya Kurdan dişibîne û di bêje:

**Doma wê 13**

www.arsivakurd.org

***Ebdula Hesenzade:* “Îro rojê hemû aliyek di hundire welat û Cîhana derve kakila vê rejîmê wekî ku heye nas dikin û hemû jî têgihîştine ku hetanî ev sîstema li ser kar be, ne xelkê Îranê rûyê azadî û demokrasî û edalata civakî dibînin û ne aştî û tebayî di nav welatên herêmê de cihgir dibe û ne terorîzm wekî kirêttirîn diyariya wî çaxî di asta cîhanê de reh û rîşalê wê tê derêxistin”**



***Ebdula Hesenzade, Sekreterê Giştiye PDK Îranê***

**Agirî: Her wekî hûn agehdar in eve yekem care ku Partiya Demokrat rojnameyekê bi zaraveya Kurmancî a jorîn û bi tîpên latînî diweşîne. Pirsa me ewe ye ku tu armanc û merema Partiya Demokart ji weşana vê rojnamê çawa dinirxînî?**

**Ebbdula Hesenzade:** Li berahiyê de min pê xweşe sexmeratî weşana Agirî pîrozbahiyê ji we desteya nivîskaran, li xebatkarên partiyê û li xwendevanên vê rojnama nû bikim û hêviya berdewamî û xizmeta bi mifah bo we û rojnamê daxwaz bikim. Ger bême ser bersiva pirsyarê, dibe bêjim: Biryara qirarê derxistina rojnameyekê bi tîpên latînî û bi devoka Kurmanciya jorîn, berî her tiştekê ji rastiyeke tale dîroka Kurd û kawdana nihaye Kurdistanê ve çavkaniyê digire. Ev rastiya tal ewa ye ku ji aliyê deshilatdarên xwedî hikim li deverê de, bêy wê ku pirsekê ji civatên xelkê Kurdistanê bikin, neteweya Kurd û welatê vî bi ser çend welatan de parve kirine û di wan welatan da jî neteweyên cuda cuda xwedî emr û ferman in û zimanên cur bi cur weke zimanên fermiye welat hatine nasîn. Ji wêne jî wegerin ku Kurdan nekariye di xwendingehê da bi zimanê zikmakiye (dayîkî) xwe bixwînin, ev zimanê ku xwendine jî li hemû welatan de bi yek Elf û bê nebûye: Li Îranê Farisî, bi xetê Erebî, li Tirkiyê Tirkî, bi xetê Latînî, li Îraqê û Sûriyê Erebî, bi xetê Erebî û li Yekîtiya Soviyetistana berê bi Elf û bê ya Rûsî bûye. Wan wextane da jî ku Kurdan li her yek ji wan welatane da bi qaçax û nîve qaçax helbest û pexşan bi zimanê Kurdî nivîsandine, neçar bûne bi vî Elf û bê yî ku di welat de resm bûye binvîsin.

Ji ber wê ku têkiliya navbera Kurdên perçên Kurdistanê hemû çaxekê ne fermî û zaf caran jî ne mimkin û ser negirtî bûye. Mixabin bo Kurdên pişkên cuda cudaye Kurdistanê çê nebûye ku bi hêsanî ji devoka hevdu tê bighîjin, yan terzeke xetê resm û bav li hemû pişkên Kurdistanê da bixwînin û ev rewşenbîrên ku delîveyeke wisan bo peyda bûye, yan bêjîn karîneke wisan ji xwe şik birine, her tim hejmara wan zor kêm û dikarin bêjîn kêmtir li sedî yek a akinciyên Kurdsiatnê bûye.

Aqibeta wê eva ye ku niho xelkê pişka herî mezine Kurdistanê, yanî Kurdistana Tirkiyê û her wisan Kurdên Sûriyê û Ermenistanê, ne wê terze devoka Kurmanciya jêrîn ku devoka edebyata PDK Îranê jî ye têdigîjin, ne jî nivîsên Kurdî bi xetê Eerbî dixwînin. Diyare bo hemû Partiyeke Kurdistanî û yek ji wan Partiya me girîng e ku xelkê hemû pişkên Kurdistanê banga wê bibîsin û ji siyaset û qirar û ramanên wê pê bihesin. Hetanî niha ev kare carna car bi wergêrandina hindik gotar û daxuyanî û danîna wan li ser malpera Înternetê, yan jî çap û belav kirina wan hatiye cî bi cî kirin. Lê di wê dawiyê de Deftera Siyasî bo wê ku ew kare bi ser û berî û berdewam pêşve biçît, qirar da rojnameyek bi tîpên latînî û devoka Kurmanciya jorîn bête weşandin ku him li ser malperê bihê danîn û hem jî bihê çap kirin û bo part û sazî û bingehên çandî ên Kurdên Kurmance jorîn bihê şandin.

Bi wî awayî hewce ye ev gava hizbê di wê çarçovê de bihê mêze kirin û bi qirarekî stratejîk û heta serî nehête hesibandin. Ji ber ku eyan e çi neteweyeke azad û bextewer, du zimanan bo xwe saz nake û du devokan di rojname û dezgehên ragehandinên giştî da bikar nabe. Li gor wê yekê, dibe daxwaza hemû Kurdekê û cehda hemû Kurdan bo gihîştin bi rojekê bît ku Kurd jî weke hemû ***gelên xudê Pêdayî*** bi yek zimanî bixwîne, bi yek zimanî binivîse.

**Agirî: Mamosta can bi hizr û bawira te Rojnameya Agirî dê bikare çi bandorekê li ser bizava çandî û rewşenbîrî a xelkê Bakurê Kurdistanê dabinêt?**

**Ebdula Hesenzade:** Eger merema pirsê xelkê Bakura Kurdistana Îranê be, ez bawer im derketina wê rojnamê guherîneke mezin pêk nayîne û cihwareke girîng dananêt. Ji ber ku wan niha tevî wêje û edebyata Hizbê hevnasîn hene û nivîsên hizbê bi xetê Erebî û devoka Kurmanciya jêrîn baş dixwînin û fêm dikin. Lê eger merem Bakurê Kurdistanê bi tewawî be ku Kurdên Tirkiyê, Ermenistan û Azerbaycanê jî ji xwe digre, bê şik û guman dê bandorek baş li ser nasandina Partiya Demokrat û xebata xelkê Kurdistana Îranê hebe, ku eve jî deskevteke bi nirx û bihagiran e. Di warê çandî de girêdayî bi qasê serkeftî bûn û pijyayî a zimanê rojnamê ve ye. Her çi qas ji aliyê ziman û rêzman û rênûsê ve serkeftî be û xwendevanan bo aliyê xwe rabikêşe, ev hinde dikare bandorekî baş li ser qasê bilind bûna hişyariya çandî a xwendevanan dabinêt û zêdebarê wê jî nêzîkiya çandî di navbera Kurdên Îranê û pişkên dinêye Kurdistanê de çê biket.

**Agirî: Bi nêrîna te bo wê ku rojnameya Agirî bikaribe bawerî û bala xwendevanan bo aliyê xwe rabikşîne û di nav weşanên Kurdî de cihê xwe peyda bike, hewceye kîjan merc û pirensîpekê wekî *kevirê xîm* ji xwe re bike bingeh?**

**Ebdula Hesenzade:** "Waqibînane" dibêjim ku edebyata PDK Îranê di warê çendayetî û her wisan di warê deranîn û terzê wîrastarî û bi tewawî di warê teknîkî ve ji edebyata çend partiyên Kurdistanê paştir e. Lê her ev edebiyate hindik →

www.arsivakurd.org

xasmaniyên xwe hene ku bi van tê nasîn û
bûne sedema qedir û hez kirin û hogiriya xwendevanên Kurd. Ji wan xasmaniyan: *Rast bêjî, Ziman paqijî (pakî) û xwe parastin ji dijûn û qisên sivik û buxtan lêdan bi vî û wan û "waqiebîn"î û giranî di qirar û helwestê siyasî de.* Di warê naverok û formê ve zimaneke paqij, zelal û esîle Kurdî, bi kar anîna rênûseke durist û kêm bûna şaşiyên rênûsî û rêzmanî û çapî. Bi xatircemî ve dikarim bêjim ku berçav girtina wan xalên sereke di rojnama Agirî de dikare serkeftina wê rojnamê di rakêşana bala xwendevanên Kurmanc yan Kurmancîxwan de dê misoger bike. Ku wisan e ev pirse girêdayiye bi cehd û livîn û karîna we desteya nivîskarên Agirî ve ye û di wê pêvajoyê de hêviya serkeftinê bo ve daxwaz dikim.

**Agirî: Wekî diyare ev rojnameye zortir bi merema gihandina zanyarî û zelal kirina pirsên cur bi cur û xizmeta çanda Kurdî bo xelkê Bakurê Kurdistanê tê belav kirin. Bo wê çendê ku ev rojnameye di karên xwe de serekftî be, te çi daxwazî, yan rasipartinek ji xwandevanên Agirî bi giştî û xelkê Bakurê Kurdistanê bi xasmanî heye?**

**Ebdula Hesenzade:** Her weşanek bi her zimanekê der bikeve tenê bi kar û xebata nivîskar û kadroyên derxistinê serekftina berçav dest ve naîne. Ku wisane serkeftina rojnameya me ya nû jî tenê di girewa kar û xebata ve da nine û li hindê jî zêdetir girêdayiye bi wê têkiliya ku nivîskar û xwendevanên rojnamê bi hevre girê didet. Lewma hêvîdar im xwendevanên Agirî rojnamê bi ya xwe bizanibin, di vejandin û pêşxistina wê de pişikdar bin, bi çavê kêmasî bûn û afirandin wan mijarên vê bixwînin, her rixnee û pêşniyazek ku bête bîra ve, bê rawestan û bi lez li rêya Fax û Emaîl û Telefon û her rêyeke berdeste din we bigehînine desteya nivîskar û li wê jî zêdetir xwe wekî parek ji desteya rêvebere rojnameyê dabinên û bi şandina gotar û lêkolîn û mijarên zanistî, siyasî, çandî, aborî, civakî û her wisan deng û bas û qewmînên navxweye welat û her mijareke girêdayî bi doza Kurd û xebata rizgarîxwaziya seranserî di Îranê de, rojnama xwe dewlemendtir û balkêştir bikin.

**Agirî: Her wekî tu dizanî, çend roj berî niha nûçeyê ava bûna partiyekê bi navê Partiya Jiyana Azad a Kurdistanê ji Televiziyona MEDYA TV û malperên Înternetî hate belav kirin û dibêjin ev Partiya nû dixwaze di rêya pirojeyeke bi nav "çareseriya demokratîk" ve sîstema deshilatê di Îranê de biguherîne û di cihê vê de sîstemekî demokratîk cihgirtî biket. Bi raya te ava bûna wê Partiyê û dirûşmên vê heta çi qasekê tevî rastiyên civaka Îranê û gelê Kurd li Kurdistana Îranê hev digrin û hûn bi daneberhewa xwe çi pêşerojekê bo vê partiyê pêşbînî dikin?**

**Ebdula Hesenzade:** Me gelek caran gotiye ku eger di welatê me de Demokrasî û azadî cihgir bûn û xebata partî û saziyan bihête holê, em hez dikin bi hezaran gul bipişkivin û di wî halî de jî PDK Îranê him ji reng û him bi bêhna xwe ve bibe şagul û gupika hemû gulan. Niha ku ev azadiya çi nine, her gavekê ku xebatkarên rêya rizgariyê di Kurdistana Îranê de bixwazin Partiyeke din cuda ji wan Partî û saziyane ku hetanî niha xebata siyasî dimeşînin, ava bikin, Partiya Demokrat ne tenê dijber nabe, belku madam ku progremên wan di pêxema gihîştin bi maf û azadiyên xelkê Kurdistana Îranê de be û ji kûratiya civaka Kurdên Îranê ve ra bibin, Hizib amade ye dostatî û hevkariya wan jî biket. Lê mixabin ewa ku di pirsyara ve de navê wê hatiye, berê çi yek ji wan du haletên jorîn nine. Ji ber ku her wekî di daxuyaniya dawî hetanî yekemîn konferansa Bizava Yekîtiya Demokratîk de hatiye, eva ku niha bi navê Partiya Jiyana Azad a Kurdistanê de hatiye ragehandin, deskirdê Bizava Yekîtiya Demokratîk e ku ev jî bi noba xwe deskirdê PKKê yan eger bi navê nû nav bibin: ***KADEK***ê ye.

Mixabin rêberên PKKê tevî wê ceribîna tal jî ku di çend salên bihorî de em şahid bûne, dest ji destêwerdana kar û barên pişkên din ên Kurdistanê ber nadet. Eger caran xwe bi Partiya hemû pişkên Kurdistanê dizanî, niha bo her yek ji perçan Partiyekê ava dike û bi xasmanî bo Kurdistana Îranê hetanî niha çend nav ceribandine, lê serbarê bêencamî û sernekeftina wê jî dîsan dest jê hilnegirtiye. Ez naxwaz im lêre de biçime nav hûrdekariyên pirsgirêkê. Tenê hindê dibêjim ku berevajî nêrîna wan dostane xelkê Kurdistanê gelek hişyar in û gelek zû berê destê wan kesane dixûn in ku bêçine cehdê dikin bi her meremekê be cênişînekê bo PDK çê bikin. Cehd kirina ser negirtiye 4 – 5 salên derbas bûyiye PKKê û kesên dinê rastiya wê gotinê bi başî diselimînin.

**Agirî: Li dawiyê hevpeyvînê de daxwazê ji te dikin ku hinek li ser rewş û kawdana nihaye Îranê û bizava nerazî bûna dijberiya xelkê û qedera Komara Îslamî, bo xwendevanên Agirî re bas bikî?**

**Ebdula Hesenzade:** Komara Îslamiya Îranê di naziktirîn û tengavtirîn qonaxa temenê xwe de derbas dibe. Çi demekê wekî niha di nav civakên xelkê Îranê de bi tenê nemaye û di nav kom û saziyên navneteweyî de jî bê hitbar ne bûye. Îro rojê hemû aliyek di hundirî welat û cîhana derve kakila wê rejîmê wekî heye nas dikin û hemû jî têgihîştine ku hetanî ev sîsteme li ser kar be, ne xelkê Îranê rûyê azadî û demokrasî û edalata civakî dibînin û ne aştî û tebayî di nav welatên herêmê de cihgir dibe û ne terorîzm wekî kirêttirîn mijara wî çaxî di asta cîhanê de reh û rîşalê wê tê derêxistin. Ji ber dê çendê, hevdengiya ranegihandî û qise lê nehatî kirî, li ser hewcehiya hiloşîna Komara Islamî çê bûye û pêşve çûna rûydanan jî bi çi terzekê di qazanca berdevkên rijîmê de nine.

Eyan e ku ewê bi tenê man û ji ber çavên xelkê ketina Komra Islamî qazancê dike, berî hemûyan xelkê Îranê û bizava rizgarîxwazî ya gelên Îranê ye. Bi vî awayî ez pêşerojeke geş û ronahî li pêşiya vê bizavê da dibînim û ji min xuyaye ku gelek pê naçe ku welatê me dê guherînên mezin bi qazanca azadî û demokrasiyê bi xwe ve bibîne.

Eve maye ku ez bêjim bi kêfxweşî ve pêşerojeke ronahî bo neteweya Kurd pêşbînî dikim û xuyanî û nîşane jî vê rastiyê didin xuya kirin ku di pêşerojeke nêzîk de Kurdên hemû pişkên Kurdistanê vê ji guherînên siyasiye herêma Rojhilata Navîn xwedî par dibin û dighîjne mafên berheqe xwe.

**Agirî: Mamosta can, ji aliyê rojnameya Agirî ve ji bo qebûl kirina vê hevpeyvînê em pir sipasê ji te dikin û hêviya temen dirêjî û serkeftinê bo te daxwaz dikin.**

**Ebdula Hesenzade:** Ez jî sipasiya ve dikim û hêviya serkeftinê bo ve dixwaz im.

www.arsivakurd.org

# Nigeraniya Komara Îslamî ya Îranê derheq ava bûna sîstemeke Federalî di Îraqê de

**Zanyar**

Di vê derheqê de bi piraniya dengan sîstema Federalî bo vî welatî pêşniyaz kiriye.

Komara Isalmî, anku rijîmek ku serwekî xwazyarê spartina Îraqê bi destê Îraqiyan e, ketiye dijberî kirin tevî wê pêşniyazê û damezrandina sîstemekî Federalî di Îraqê de bi tiştekî ne baş û kareke ne binecih dizane û di rêyên cur bi cur de cehda dijberî kirinê diket. Eve ku rijîma Komara Îslamî dijberiya ramanên Civata Deshilatdare Îraqê derheq Federal bûna wî welatî diket bi berçav girtina vê çendê ku hem Amerîka û hem pişkek zaf û berbiçav ji welatan ragehandine ku hikûmeta pêşeroja Îraqê û bi giştî ev welate dê bibîte berjengek baş bo hemû deverê dilkutokê girtiye û xofa bûna mînakek wisan li vê deverê de pêşberî deshilata xwe dibîne û ev nigeranî û tirsyanê jî li zaf sefer û hevdîtinên dîplomasiyên rayedarên xwe de aniye rojevê. Komara Îslamî ya Îranê li vê çendê nigeran e ku ava kirina nîzameke Federalî di Îraqê de xwe derbasî cîranên Îraqê û welatên deverê, ev jî bi berçav girtina dê rastiyê ye ku Îran welatekî pirneteweyî û pirol û meseb e, bi awayekî xwezayî bo rijîmeke wiha ku dijî demokrasî û mafên gelên bindest cihê pê xweş bûnê ye.

Bi ava bûna sîstemeke Federalî di Îraqê de bêşik hem gelê Kurdê wî welatî û hem oldarên Şîî ên Îraqê dibine xwediyê deverekî xasmaniye xwe di çarçoveya Îraqeke Federalî de û di rewşeke wisan de zaf ji wan zordarî û bêheqî yên ku dehan sal e derheq bi wan hatine kirin, dê li ser wan bihên hilgirtin û mafên neteweyî û olî û mirovahiya wan bêne bi cih anîn. Ku ev jî tevî kakila dijî demokratîk a Komara Islamî heta li derveyê tuxîbê Îranê jî hev nagirît.

Rijîma Komara Îslamî ku di salên bihorî de di pêvajoya xebata gelê Kurd di Îraqê de bi eşkere têkilîyek tevî hêzên Kurdî yên Îraqê hebûye û xwe bi dilsoj û xemxurê wan nîşan daye. Qet bi vê çendê razî nebûye ku xebata gelê Kurd di Îraqê de bighîje encama dilxwaze wî gelî bo bi cih hatina mafên wan û li piştî vê pêwendiya serwekî û derewînî de tevî çend welatê dine cîranê Îraqê ku her yek ji wan bi ser parek ji neteweya Kurd de




deshilatdariyê dikin û di komplo û pîlan darêtinê de nerawestiyaye û bo bi encam ne gihîştina xebata wan hevrikî û pêşgîrî kiriye. Bi gotinek din heke Komara Islamî di hember rijîma ji navçûye Îraqê de hez ji navçûna hêzên Kurdî yên wî welatî nekiriye, lê bi kiryar çi ji destî hatibe ji bo bi encam negihîştina vê bizava berheq û mafxwaze xelkê Kurdistanê kiriye. Lewma niho di halekê de xwe zevtker û bin pê kerê mafê gelê Kurd û gelên dine zor lêkirî yê Îranê ye. Ji devr û rola ku Kurdên wî welatî di welatê xwe de hene û dê hebin, tengijiye. Devereke Federal ya Kurd di çarçoveya Îraqê de bi xetereke mezin bo ser xwe dizane û eger wekî dibêjin Îraq jî bibîte mînakek bo deverê ku eyan bûna pirsgirêka Kurd û gelên dinê ye Îranê bo ser deshilata îdeolojîk û dîktatoriya ***Welayeta Feqîh*** a xwe bi xeter û tirsek mezin dizane.

Cuda ji pirsgirêka Kurd, Komara Îslamiya Îranê ku xwe bi navê ol û Îslam û Şîî di Îranê de hikmdariyê dike, serwekî dibe kêfxweş be li vê çendê ku ogirê olê Şîî di Îraqê de dibine xwediyê devereke Federal û ev zilm û zordariya ku li rejîma berê ya Îraqê derheq bi wan dihate kirin, li ser wan nemîne. Lê belê, bi kiryar di vê pêwendiyê de jî ketiye dijebrî kirinê û hez bi rewşeke wisan hetanî bo Şîiyên Başûra Îraqê jî naket. Ji ber ku Şîiyên Îraqê di halekê de dibine xwediyê devereka Federal ku ev sîstema Federalî, Kurdên Îraqê jî bi xwe ve digire, tiştek ku tu car bi dilxwaza Komara Islamî nebûye û nabe. Cuda ji vê çendê rêberên Komara Îslamî ya Îranê dixwazin navendên oliye Şîiyên Îranê wek navenda pîroz û esliye tev Şîiyên cîhanê cih bigire û xwe bi rêberê cîhana Şîiyan bidin selmandin. Xwezayî ye heke Şîiyên Îraqê bibine xwediyê devereka Federal di Îraqê de ku ev devere navendên Oliye wek Necef û Kerbela û . . . HWD li xwe ve digire. Bi berçav girtina vê çendê ku ew cihane li berê da navenda mesebê Şîî û binegeha zaf Ayetula û ***"merceên teqlîd"***ên Şîî bûne û hene, careke din rola xwe peyda dikin û bi kiryar navendên mesebî yê Îranê û rêberên Komara Îslamî dikevine qiraxê.

Tiştek ku bo rêberên Komara Îslamî û deshilata olî û mesebiya wan cihê xeter û tirs û nigeraniyê ye. Pirsgirêkeke din di wê pêvajoyê de ku xasmaniya her sîstemeke Federaliye ku berevajî rijîmên dîktator û îdeolojî, civakî ber bi pêş ve çûn û wekhevî û parve kirina deshilatê dibe. Ew jî hindek pîvan û mercên sîyasî,

www.arsivakurd.org

civakî û exlaqî li dîv xwe tîne û bihayên îdeolojî û olî dixe bin xala pirsyarê.

Xwezayî ye ku rewşek wisan tevî deshilatên olî û îdeolojî bi xasmanî tevî bawer pê kirin bi Welayeta Feqîh li hevrikiyek tewaw de bît û bo wan cure hakimyet û deshilatane xetereke mezin dibe. Cuda ji wane Fedralîzm di nefsa xwe de li Nizamîgerî (leşkerî bûn) û mîlîtarîsmê bi dûr e û nizameke wisa kêmtir pişta xwe bi çek û qadxane û silahên cur bi cur ên tevkuj girê dide. Lewma bi mînak danîna Îraqê bo deverê û paşan dûr ketina welatên herêma Rojhilata Navîn ji berêkaniye bo dest gihîştin bi çekên zaftir û hevdemîtir û hebûna hêzên teyare nizamî (leşkerî) êdî rê nadet di vê navberê de, rejîmek wekî Komara Îslamî xwediyê hêza nizamî ya zaf û çek û hewcehên şerên cur bi cur be, û bo dest gihîştin bi çekên tevkuj jî bixebite. Bi xasmanî ku ev rejîme di heyamê temenê xwe de daye eyan kirin ku rijîmeke terorîst, ne berpirsyar û sereberedayî û hir û neban bi yasayên pejirandiye navneteweyî û her gav dikare bo welatên cîranên deverê û heta cîhanê jî tirs û nigeraniyê biafirîne. Bi baldan bi hemû ev pirsên giring ku gav hilgirtina Îraqê bo ava kirina nizamekî Federalî ku dibe sebeba guhertinên bingehîn di deverê de, Komara Îslamî ya Îranê bikeve tengasiyê û bi hemû hêz û şiyana xwe bixebite ku, ceribînên niho yên Îraqê tevî ser negirtinê rû bi rû biket. Lê belê tevî wan hemû têkvedan û dijberî kirina vê rejîmê ku wisan tê xuya kirin ku îradeya xelkê Îraqê û civata deshilatdare vî welatî û piştgîrî ya Emerîka û Ewropayê ji vê gavê û pêşve çûna vê pêvajoyê, pîlanên Komara Îslamî û hêzên welatên mîna vê rijîmê dê pûç bibin û xelkê Îraqê dibîte xwediyê nizameke Federalî û deshilateke civakî ku di bin hakimyeta vê nizamê de gelên Îraqê û peyrevên dîn û olên cur bi cur di wekhevî û mafê beramber û edalet û tenahiyê de bijîn.

## Mehkûm kirina kiryarên terorîstî

Roja pêncşemî 29'ê Xezelwera 1382'ya Rojî (2003.11.20 Zayînî), du teqînên mezin li du cihên Bazirganiyê ên pir xulyaqet li bajarê Stenbol a Tirkiyê qewimîn ku bû sedema kuştina 28 kes û birîndar bûna 300 kesên din. Tenê 5 rojan berî vê kiryara terorîstî bû ku bûyereke dine terorîstî di wî bajarî de afirî ku ev jî bû sedema kuştina hejmarek ji kesan û birîndar bûna hejmarek zaftir ji xelkî û zirar û ziyanek zaf û ber bi çav afirand.

Ev cure kiryarên terorîstî ku pitir dibine sebebê kuştin û birîndar bûna xelkê sivîl û bê guneh, heyamek berî niho li Tirkiyê, Îraq û welatên din ên herêmê ku xurtî hatine holê, bûne sebeba kerb û nerehet bûna xelkê seranserê cîhanê û raya giştiye cîhanê û tevî nerazî bûnên xurt u berfireh rûbirû bûye.

PDK Îranê ku gorî û qurbaniyê terorîzma Komara Islamî ya Îranê ye, vê kiryara terorîstî gelek ji bo mirovahiyê û belav bûna vê jî xeterek bo tenahiya canî û maliye xelkên sivîl û bê guneh di wan welatane de dizane û bi tundî şermezar û mehkûm dike.Teror weke kiryarek nebaş li her ciheke cîhanê û bi destê her girûp, dewlet û komekê û li dijberî canê her mirovekê û bi her meremekê ku bihê kirin şermezar û mehkûm e û xebat bi dijî terorîzmê wezîfeya hemû ev welat, Partî û Rêxistina ye ku xwe bi alîgir û berevanê aştî û azadî, ewlekarî û tenahiya xelkê cîhanê dizanin.

Em hêvî dikin ku bi cehdek giştî û girtine bera rêya çareseriyê ji aliyên civakên navneteweyî ev kiryarên hov û xirabkerane bihêne bin bir kirin û nehêl in carek din dubare bibin ku li welatên cur bi cur de canê xelkê sivîl û bê guneh dêxe ber gefê.

**Partiya Demokrata Kurdistan a Îranê**
**1382.08.30'ye Rojî**
**2003.11.21' ye Zayînî**

## Nûçeyên Kurdistanê

### Civîna rayedarên dewletê li bajarê Seqiz

Roja şemiyê 20'ê Xezelwera 1382e rojî (11.11.2003 zayînî), Şivra îdarî ya bajarê Seqiz bi pişikdariya Cemşîdî cêhgirê siyasî yê yekeme Parêzgarê Kurdistanê li Seqizê û her wisan Fermandarê wî bajarî û berpirsyarên îdareyan civînek li dar xistin.

Di wê civînê de berpirsên îdareyên dewletê seba vê çendê ku çima hetanî niha tenê 3-4 kesan xwe bo noneratî di Meclisê de nav nivîs kirine, nerazî bûna xwe eyan kirin.

Di dawiyê de gihîştin vê encamê ku hemû berpirsyar cehd û bizava wan eve be ku xelkê ji bo pişkdarî kirin di hilbijartina pêşeroja Meclisa Şivra Islamî de hay bidin.

### Kamyaran
### Lêkdana xelkê û hêzên rijîmê li Kamyaranê

Roja 14.08.1382'e Rojî (05.11.2003 Zayînî), otombêla kasibkarekê di nav bajarê Kamyaranê de ji aliyê çend kes ji hêzên leşkeriye rijîmê tê girtin. Her di wî çaxî de xelk li devra wan xir dibe û daxwaza azad kirina otombêlê dikin, ku di encamê de di navbera xelkê û hêzên rijîmê de tevçûn û alozî çê bibe û piştî wê çendê ku şûşeyên otombêla Hêzên Întizamî dişkînin, du kes ji wan (Hêzên Întizamî) jî bi navên Serheng Azadî û Serwan Yawerî tên birîndar kirin. Lê roja paştir rijîm dest bi girtinên ciwanên wî bajarî dike û hetanî dema gehiştina vê nûçeyê 11 kes hatine girtin û şandine girtîgehê.

www.arsivakurd.org

**Doma rûpelê 1**

# Ji çiyayê Agirî ve ber bi rojnameya Agirî

zaravên esîle zimanê şirîne Kurdî û xurtên xebatkare neteweya me, bi alîkariya nivîser û afirandinvanê gelê me di pêxema xizmet bi gel û niştiman da wezîfên xwe bi cih bigehîne û bibe hêvî û baweriya xwendevanên rêzdar û xelkê xebatkare Kurdistanê.

Danana navê Agirî li ser vê rojnamê ji aliyê Partiya Demokrat ve dizivire bo çend sedemên dîrokî ku ji aliyekê çiyayê Agirî di warê dîroka siyasî ve mîna sembola berxwedanî û remza hevgirtin û nasnameya gelê me tê hesibandin û ji aliyeke din ve, nasnama herî pêş çave xelkê vê herêmê ye, ku rojnama Agirî bi zaraveya wan û zêdetir ji bo wan çap û belav dibe.

Bo zanîna zêdetir û pênase kirina pişkek li xasmaniyên cuda cuda ye çiyayê Agirî ku rojnama me bi vî navî hatiye binav kirin, dê bala ve bo wan alîyên girîng û ber çave çiyayê Agirî rakêşin:

Her wekî tê zanîn Agirî navê çiyayekî herî bilinde Kurdistanê ên ku di xilasiya tuxîbên Bakurê Rojhilatê Kurdistanê ve rêze çiyayên Zagrosê bi çemê ***Aras*** ve girê dide û ketiye navbera tuxîbê sê welatên Îran û Îraq û Ermenîstanê. Bilindahiya Agirî 5137 mêtran li ser rûyê behrê ber bi esman hilkişiya ye.

Li mêj dem e ku efsane û çîvanokên cur bi cur derheq bi vî çiyayê gerdinkêş hatine gotin ku yên herî bi nav û deng, îşare bi vê hindê dikin ku di çax û serdemê berê de di çiyayê Agirî de burkan hebûye û ji ber vê hindê ku peşqel û guriya Agir li ser bilindahiya vî çiyayî de bilind dibû, navê Agirî li ser vî çiyayî danîne.

Yan jî eva ku li ***Tewrat***ê da îşare pê hatiye kirin ku li çax û heyamê hizretê Noh Pêxember de dema ku bahoz û kirêve bibû, gemiya hezretê Noh li ser vî çiyayî Agirî lenger girtî ye.

Xuya ye ku di van salên dawî de wî çiyayî bala lêkolînvan û pisporên çiyanase cîhanê bo aliyê xwe rakişandiye û renge di pêşerojê de zaf jî nepenî û xasmaniyên dine vî çiyayî bihêne eşkere kirin.

Xasmaniyeke dinê ye Agirî, dîroka siyasî ya Agirî ye ku di salên 1927 – 1931'e Zayînî de, yanî di wî çaxî de ku piştî tepeser kirina serhildana Simkoyê Şikak di Kurdistana



Îranê de, bizava Agirî li Kurdistana Tirkiyê bi serokatiya Êhsan Nûrî Paşa dest pê kir, ku navenda vê serhildanê çiyayê serbilinde Agirî bû.

Bi wî awayî bizava Agirî di vî çaxî de Tîrojka xwe avête nava piraniya deverên Kurdistanê û bû sembola hevgirtin û hevxebatiyê di navbera xortên neteweya Kurd li hemû parçeyên Kurdistanê, di pêxema gihîştin bi mafê çarenivîsa xwe de.

Li Kurdistana Îranê Celaliyan bi rêvebiriya ***Ferzinde*** û li Kurdistan Îraqê Barzaniyan bi rêvebiriya ***Şêx Ahmed***, û Kurdên Sûriye jî bi serokatiya ***Haco*** bi awayên cur bi cur di wê tevgerê de beşdar bûn, û bi cehd û xwe gorî kirinê karîn bi ava kirina Komara Agirî û çeqandina alaya Kurdistanê li ser bilindayiya Agirî, şanaziyek mezin bo neteweya Kurd biafirîn in.

Xuya ye ku ev serhildane jî piştî çar sal berxwedan û xweragirî, aqibet bi sedema komplo û îxaneta neyarên Kurdan ve hate tepeser kirin. Akinciyên vê herêmê tûşî qewmîneke herî mezine mirovî bûn û bi hezaran kes li jin û zarok û pîr û kal hatine qir kirin û bi dehan hezar kes jî bi terzekî hovane hatin veguhastin u dûr xistin ji mal û heyiya wan hate talan kirin û gundên van hatin kavil kirin.

Li vê demê were hetanî niho navê Agirî mîna landik û êvirgeha tevgera azadîxwazî û remza hevgirtin û berxwedan û nasnama belengazî û bindestiya Kurd û axa parve kiriye Kurdistanê di herêm û cîhanê de navbangê xwe derxistiye û bûye parek ji dîroka tejî ji bûyer û qewmînên netewa me.

Sedemeke dine bi nav û


Demokrasi bo Îranê
Hejmar 1 Novembera 2003
agirî
Otonomi bo Kurdistanê
Sermaweza 1382e Rojî
Rojnameyeke siyasî û çandî ye
Parta Demokrata Kurdistana Îranê diweşîne

Li çiyayê Agirî ve ber bi Rojnameya Agirî

Birêz Ebdula Hesenzade, Sekreterê Giştiyê PDK Îranê di hevpeyvîneke tevî Agirî de

Xwendevanên hêja, Ev hevpeyvîna jêrîn bi şane bûn û kêfxweşiya weşana yekem hejmara Agirî ji aliyê desteya nivîskarên Agirî ve tevî rêzdar Ebdula Hesenzade Sekreterê Giştiyê PDK Îranê hatiye pêk anîn, em bala ve bo pirs û bersivên girînge wê hevpeyvîn radikêşin: Doma wê 2

Nigeraniya Komara Islamî derheq avabûna sîstemeke federalî di Îraqê de

Zanyar

Doma wê 4

"Îran qurbaniyê terorizmê"

Kurmanc Hakkî

Doma wê 10

Destpisiya malî li Îranê de 9

Hilatina mejiyan li Îranê 18

22'min Kongireya Entirnasyonal a Sosyalîst 19

dengî û xweştivî bûna Agirî dizivire bo qonaxa xebata çekdarî û berxwedaniya PDK Îranê dijberî rijîma kevnar parêze Komara Îslamî ya Îranê di salên 1980 – 1995e Zayînî de ku Partiya Demokrat navê yek ji hêzên xwedî şiyan û çelenge Pêşmergên xwe li Bakurê Rojavayê Kurdistanê de bi navê Agirî bi nav kir.

Ev hêza qehreman ku di pêxema berevanî ji mafê berheqe gelê xwe de karî bi terzekî bêmînak bi dehan û sedan hemase û şanaziyiyên mezin û ji bîr nekirî bo Partiya Demokrat u gelê Kurd biafirîne û bibe cihê serbilidiyê û peyva ser zimanê xelkê Pêşmerge parêze Kurdistanê.

www.arsivakurd.org

# Rewşa malwêrankere îtiyad(narkotîk)ê di Îran û Rojhilatê Kurdistanê da

**Azad Kurdî, Azadkurdi@hotmail.com**

Di cîhana evro de, ku mirovayetî bi tundî tûrikê xwe bo gihîştin bi pileyên pêşekftinê girê didet, ***Mewadê Muxedir anku narkotîk*** yê bûye mezintirîn kosp û asteng li ber rêya pêşketina mirovan di hemû waran de. Agirek ku heyia mirovan dişevitîne û dibe sebebê herifîn û ji hev belav bûna çarçove û bingeha malbatan. Ger li serjimêrîyên ji hev veqetana jin û mêran û jiyana neserkeftî ya wan, hin pîvan di destê me de heban, bêgoman mewadê muxedir, mezintirîn lîstikvanê vê tirajêdiyê dibû. Zor hatiye dîtin, ku keç û xortekî evîndarên hev ku ji parzinkên cur bi cur derbas dibin û piştî bi hezaran dijwariyan digehin hev, lê îtiyad bûna yek ji wan, hemû hêvî û xweziyên wan ji nav dibe û pirsgirêkek mezin ji bo civaka mirovayetiyê dixulqîne.

Heger em bixwazin li ser rewşa xirab û malmêrankere mewada muxedir ku niha li bajarên Kurdan zêdetir li herêmên din belav bûye nirxandinekê bikin, hewceye li berahiyê hinek li ser rewşa îtiyadê li tewahiya Îranê de bas bikeyn:

Ciwanên her welatekî sermaye û gencîneyek in, ku hikmê serbilindî û serfiraziya gel û netewa xwe pêk dînin. Pêşeroja geşa her welat û neteweyekê mirov dikare di çawanî û rewşa jiyana ciwanên wan de bibîne.

Em binêrîn ku rewşa civak û ciwanên Îranê piştî 24 salan desthilatdariya Komara Îslamî ya Îranê Çawa ye? Hebûna 44 milyon kes heşîmeta(şêniya) di bin temenê 30 salî de li Îranê û cîranbûna tixûbê Îranê tevî mezintirîn welatê çêkerê mewadên Efyonî di cîhanê de (yanî Efxanistan), wisan jê kiriye, ku Îran bi yek ji riyên derbasbûna Mewada Muxedir bo Rojhilata Navîn, Ewropa û Amerîka bê hesibandin. Lê zirar û xisara mewadê berî her cihî li hevwelatiyên Îranê dikeve, piştre digehije welatên din. Goriyên yekem û sereke yên wê, xelkê Îranê, bi taybetî zêdetir ji 10 milyon kes ji netewa Kurd e. Lewre ev mewada malwêranker bi berfirehî û pir bi hêsanî bi destê ciwanên Îranê dikeve. Em dikarin bêjin ku îtiyad bi muxediratê(tûşhatina bi narkotîkê) li Îranê bûye pirsgirêkeke bingehîn. Li gor agahî û jêderên nû, ku derheq mifa wergirtin ji mewadê muxedir û îtiyad li Îranê tên weşandin, îtityad bûye pirsgirêkek mezin û neçareserkirî ya Civakî!!!

Li gor rapora semînara pêşgîrîkirin ji zêdebûna îtiyadê, ku li havîna sala 1380 Rojî(2001 Zayînî), li bajarê Meşhedê, hate li darxistin, 70% ji wan kesên ku tûşî îtiyadê bûne mirovên malbatdar in(zewcî ne). Bilî vê Çendê jî di her rojê de 600 kes sexmeratî mewadê muxedir li Îranê tên dest bi ser kirin(tên girtin). Di her mehekê de 100 kes bi sedema kişandina zore teryak û heroyînê dimirin. (1)

Tê gotin ku di her rojê de 500 kes ji ciwanên Îranê tûşî kişandina narkotîkê dibin(mutad dibin). Heşîmeta mutadan li Îranê her 10 salan du beramber(du qat) dibe. Lê ya herî balkêş û cihê kul û keserê eva ye, ku roj bo rojê ji radeya temenê ew kesên ku tûşî muxediratê bûne, kêm dibe. Mixabin niho ev nesaxî zêdetir di nav xwendekarên welat de bi awayekî berfireh belav bûye û sed heyf rû li zêdebûnê ye.



### Eger û sedemên zêdebûna îtiyadê di civaka Îranê de çi ne?

Pirsên wê mijarê, eve ne ku eger û sedemên bingehîn yên îtiyadê li Îranê çi ne? Çima tu çareseriyek ji bo wê pirsgirêkê nayê kirin? Qurbaniyên wê kî ne? Dê encama wê çi lê bihê?!

Bi giştî, îtiyad di her civakekê de ji ber nebaşiya warên cur bi cure siyasî, aborî, civakî, paşdemayîna bîr û rayên çandî û ewlekariyê derdikeve rojeva jiyanê. Dizîkirin, hejarî û nedarî, fesada cur bi cure yekkesî û giştî, bêkarî, kuştin, bêhêvîtî ji paşerojê re û . . . hwd ji belayên tirsnak ên îtiyadê li civaka niho ya Îranê ne. Temenê zewicînê ji ber pirsgirêkên aborî û malbatî heya qaseke zêde çûye jor, qasa ji hev veqetana jin û mêran zêde bûye û gelek pirsgirêkên din yên nexweş.

Îtiyad û nesaxiyên civakî yên din li dema desthilatdariya rejîma berê ya Îranê (Pehlewî) hindik bû. Civaka Îranê û bi taybetî civaka Kurdewarî li Kurdistanê wê demê di wî warî de sax û paqij bû, lê piştî bi ser kar hatina rejîma paşverû ya melayan li sala 1357 rojî (1979

www.arsivakurd.org

**Doma rûpelê 7:**

## Rewşa malwêrankere îtiyad(narkotîk)ê di Îran û Rojhilatê Kurdistanê da

Zayînî) pirsgirêkên civakî, siyasî, aborî û çandî bi zanebûn dan dest pêkirin. Em dikarin bêjin ku şerê 8 saliye Îranê û rejîma ji nav çûya Beissî ya Îraqê bandoreke mezin di wê bûyera civakî de heye.

Rejîma Komara Islamiya Îranê dirav(bodce)ke gelek zêde ji bo domandina wî şerê bê mentiq, bi pêkanîna saziyên mîna Supahê Pasdaran, êstixbarat (êtilaat), Besîcê Merdomî, alîkarî kirina hêzên terorîst li Rojhilata Navîn û hemû deverên din yên cîhanê û hin dezgeh, hêz û saziyên ne hewce bi kar anîne. Eger ev dirave ji bo fêrkirin û hînkirina nifşê ciwan û zarokan hatiba terxan kirin. Niha civak ji kes û kesayetiyên zane, kêrhatî û hişyar dewlemend dibû. Rewşa jiyan û gel mîna niha nedibû. Lê wan hergav şiyan û hizra xwe daye tiştên jorîn û tenê tepeserkirina ciwan, xwendevan û xelkê bûye karê wan yê sereke. Eva bû ferhenga dewletdarî û desthilatdariya wan. Mînaka herî baş û zindiye wê qirkirin û tepeserkirina Kurdan bi awayeke hov û cinayetkarane bû, ku bi taybetî ji sala 1979an heya 1985an bi tundî li hemû Rojhilatê Kurdistanê berdewam bû.

Zêrevan û civaknas dibêjin, ne ev kiryarên tund û tîje hêzên rejîmê û ne jî ev bernameyên çandî – civakî yên saziyên propagandeyî (teblixatê) li Îranê nekarîne ji çûna xelkê bo aliyê mewada muxedir pêşgîriyê bikin.

### Kurdistan û Tirajêdiya îtiyadê

Rojhilatê Kurdistanê ji 4 wilayetên: Urmiye (Azaerbaycana Rojava), Kurdistan (Sine), Kirmaşan, Îlam û pareke mezina wilayeta Loristanê pêk hatiye. Piraniya rûniştvanên van çar wilayetan Kurd in. Zêdetir ji 10 milyon Kurd di van wilayetane de dijîn.

Îtiyad li herêmekê bo herêma din ferq heye(cudatî tê dîtin), Kurdistan berevajî herêmên din yên Îranê û bi sedema Kurdbûn û daxwazkirina mafên neteweyî yên xwe pitir ketiye bin bandora wê siyaseta çewt. Her wek pêştir jî bas hate kirin, civaka Kurdan li dema desthilatdariya rejîma Paşatî ya berê(Pehlewî) û destpêka desthilatdariya rejîma Komara Îslamî pir paqij û pak bû, lê siyasetên nemirovane yên Komara Îslamî, rewşa civata Kurdan tûşî derdên giran kirine û şepirzeyiyek xirap xistine nava malbatên Kurdan. Rejîma paşverû ya Îslamî bersiva



xwestek û daxwazên Kurdan yên aştîxwazane û berheq bi şer û bersiva kuştin û qirkirnê dan. Wan hurmeta neteweya Kurdan şikandin û gelek sivikatî bi kesayetiya netewî ya Kurdan kirin. Ev şerê kuştina mejî û hêza ciwanên Kurd li hemû deverên Kurdistanê dom kir û hên jî bi germî berdewam e. Kurdan bi rêveberiya partiyên xwe yên siyasî li hemberî wan siyasetên kawilker û hovane berevanî ji mafê netewî û berheqê xwe kirin(2).

Deshilatdarên Komara Îslamî bi mifa wergirtin ji hêza êstixbarat(êtilaat)ê, hewil dan, ku mejî û hêza bingehîne şoreşê yanî ciwanan ji nav bibin. Ev siyaseta ne mirovane û bê exlaqane ya wan niho bi gur û tundtir bûye. Ew dixwazin bi vê siyaseta xwe îradeya berxwedana gelê Kurd bişkînin. Dema mirov bala xwe dide rewşa aloz û şepirzeye îtiyadê li Rojhilatê Kurdistanê, wijdana mirovayetî û Kurdane ya herkesî matmayî dimîne.

Niha di Îran û Kurdistanê de du curên muxediratê, weke Tiryak û heroyîn(narkotîk) zêdetir tên bi kar anîn. Ew bi erzanî(bihayê ne giran) û bi awayekî berfireh bi dest dikevin. Bi xasmanî di heps û girtîgehên rejîmê da ku niha bûne bazara herî mezine muxediratê. Rewşa îtiyadê ewqas xirab bûye, ku gefeke mezin li xortên gel û netewa me diket û dibe em li hizra paqijkirina nifşê xwe yê paşerojê de bin.

Ev siyaseta hovane û nijadperestane ya rejîma melayan jî dibe mîna tirajêdiyek xemgîn di dîroka Kurdan de bête mêze kirin. Niha kirîn û firotina tiryak û heroyînê bêtirs li her dereke bajar û gundên Kurdistanê û bê tirs û lerz ji girtin û zindanîkirinê didome. Pişkek zaf ji wî mewadî hêzên kirêgirtî û kesên xwefiroşe dezgehên êstixbarata Îranê di nav ciwan û gel de belav dikin. Ew hazir in, ku tiryak û heroyînê bê dirav bidin wan kesên ku dixwazin wê di nav gel de belav bikin. Eva rast e û em dibînin û dibihîsin, ku dewlet bi wî awayî xizmeta « pêşveçûna Kurdan » diket!!!


<u>*Jêder:*</u>

1. *Rojnameya **Hamshari** Çapa Tehranê, hijmar (3120)*

2. *Dokumentên rojnamevanê Kurd, birêz Kakşar Oremar*


www.arsivakurd.org

# Destpîsiya malî di Îranê de

Bavê Hejar
hejar@yahoo.com
7.11.2003

Sîstema ramyariya Komara Islamî bi awayekê hatiye damezrandin, ku her carê bi afirandina tengasiyekê xelkê mijûl bike û rê nede pirsgirêkên abûrî, civakî û siyasiyên xwe bînin ser ziman. Rewşa han bûye sebeba wê yekê ku bertîl xwarî di nav Komara Islamî de bibe yek li rêyen çareseriya pirsgirêkan û ji aliyek din jî damezrandina mafiyayek malî di nav sistema abûriya Îranê de. Lewma her çewa li kurdî de me bo hinek mehên salê gelek navên cur bi cur hene di komara Islamî de jî ji bona rişwê gelek nav hatine saz kirin: Heqdest, destxweşî, ya natilya, jêr mîzî, perê çayê, dew şirîn kirin û bi dehan navên din.

Ji Bona wê ku em bikaribin bersiva sebeba bertîl (rişwe) xwarinê di nav civak û çînên cur bi cure Îranê bidin, belkî ya qenc ev bît em mêzeyî şêwaza dabeşkirina deshilatê li Îranê de bikin. Mezintirîn deshilata abûrî li Îranê ne li destê kompaniyên taybetî an dewletî daye belkî li destê rehendek sêhem binavê ***Binyat*** ku birastî taybet bi Îranê ye dey e.

Binyatên Îranê bi navên cur bi cur xwediyê hêzek abûriye gelek mezin in ku belkî di seranserê cîhanê bi wî awayî nebit. Ji nav vana dikaribin îşare bi Binyata Mustezefan ku li despêka temenê Komara Islamî li rêberê rêjimê Ayetullah Xumeynî damezrand. Ji bilî wê binyata Canbazan, Binyada Şehdîdan, Komîtey Imdada Xumeynî, Binyada 15'ê Xurdad, Camiey El-Sadêq, Binyada Amîn ol Moiminîn û hdv, dikaribin nav bibin. Astana Qudsi Rezewî ku erka pêragehiştin bi mezarê Xumeynî bi istûyê wê ye, him di warê deshilata abûrî û him jî di warê şêwaza kar de di gel binyatên din di gel hebûna wekheviyan gelek cudahî jî hene.

Diber wê jî bertîl xwarî li Îranê ew hinde mezin bûye ku em dikaribin basa "rant xwariye" bikin.

Li sala 1994 ve ku hinek li dizî û dest pîsiya karbidestên komara Islamî di rojnameyan de hat weşandin, kar û çalakiyên binyatên nav Îranê de ketin ber bala bîr û rayên giştî. Ev nûçeyên ku car car bi navê gote got di nav xelkê de dihatin axiftin hêdî hedî bûn serdêr û nûçeya yekeme rojnameyên di nav rejîmê jî tên weşandin. Piştî eşkere bûna 123 milyar tûmen ***rent xwarina*** banka Sipeh, **Fazil Xudadad** bi tawana fesada abûrî hat dar xistin. Xuyaye ku Xudada wek moreyek bûye qurbaniyê sîstemek mezintir ku bi destê ayetollha birêve diçe. Di piroseya aşkira bûna perwenda 123 milyar tûmenî de navê Mortaza Refîq Dûst gelek kevtibû ser zara û yek ji moreyên herî zor cihê gumanê bû, lê Refîqdûst li aliyê rêberê komara Islamî we hat parastin û berprsayetiya wî bo serokayetiya Binyata Mustezefan hetanî 5 salên din jî hat taze kirin. Bi wî awayî hat nîşan dan ku rêberê mezine komara Islamî bi xwe jî yek ji beşdarên rênta 123 milyariye.

Ji gor serekaniyên abûrî li dahata "naxalise" Îranê ku xwe digehîne nizîkê 115 milyar Dolara, zêdeyî 35 milyar Dolaran dikeve xizmeta abûriya bin erdê û li kanalên ne fermî digehin destê xwedî deshilatan. Abûriya weşartî (bin erdê) tiştek nine ku bikaribe di serjimêrî û statîkan de bê xuyanî kirin. Ew abûriya han ji meydana çalakiyên binyata ne.

Xuyaye bo welatek mezin mîna Îranê beşa binyatan di abûriya Îranê de ku xwe digehîne 2 -3 % nikaribe karek zor ser abûriya Îranê bike. Lê ya giring çarenivîsa wan binyatane û herwisa ew rola ku ew binyadane li ser siyasetên abûriye Îranê digêrin e. Jiberku mafiyaya deshilata wan binyatane ew qas mezine ku dikaribin pêşkevtina abûriye beşa taybetî û beşa dewletî bisekinînin.

Nebûna zelaliya abûrî di sîstema komara Islamî de bûye sebeba wê yekê ku beşa ne dewletî û ne taybetî hêdî hêdî bibe xwedî deshilat li nav beşa neftê de jî. Yasaya komara Islamî taybetî kirina abûriya neftê qedexe dike, lê diber taybetî nebûna binyatan ewane rê heye bibin xwedî şerîkên neftê.

Bi wê sîstema taybet, karbidestên Komara Islamî karîne sermayeyên gelek mezine gelên Îranê li welat derxînin û li bankên derve razînin. Armanca wana dikaribe 2 tişt be, digel misoger kirina warê jiyana xwe ya paşrojê dikaribin bi wî sermayê bibin sedema sazkirina saziyên terorîstî.

www.arsivakurd.org

**Doma rûpelê 1**

# ”Îran qurbaniyê terorîzmê”

Nivîsîn û wergêran: Kurmanc Hakkî



derxîne û cîhanê li terorîstan paqij bike. Êrîşên terorîstî piştî şerê Îraqê zêdetir ji berê dişopin û bûne sebeba wê yekê ku piroseya aştiya Filistîn û Îsraîlê jî bi tewawî bê herifandin. Pirojeya ***Xarîta Rê*** veke xuyaye berî ji dayikbûnê di ber êrîşên xwekujiye terorîstan tê fetisandin. Hêzên terorîstî xwe bi nûnerê gelê Filistîn û berevanên nirxên Îslamî dizanin. Hemas, Cehad û Hizbullah ev rêkxistin in ku berpirsayetiya êrîşên xwekujî bi istû digirin û hemî rêkxistinên han ji aliyê Komara Îslamî tên piştigîrî kirin.

Rejîma Îranê gelek berî êrîşa 11’ê Septembrê piştgîrî ji terorîzma navnetewî kiriye û bi dehan neyarên siyasiye xwe li rêya teror li dereve û hundirê welat ji holê rakirine. Rejîma han li hemî welatên din zêdetir dijî aştiyek wiloye li Rojhelata Navîn ku têde gelên Filistîn û Îsraîl bi mafên wekhev û bi cînaretî welatên xwe avedan bikin. Komara Îslamî li roja hatine serkare xwe, Îsraîl wek welat bi fermî nas nekiriye û li ***Misilmanên Cîhanê*** xwestiye welatê ***Benî Îsraîl*** ji holê rakin. Komara Islamî di dîroka zêdey li 24 salên xwe de her tim alîgir û piştîwanê hêzên terorîste deverê bûye.

Li sala 1979 hetanî niho zêdetir ji 1000 kes li 200 êrîşên terorîstiye Komara Islamî hatine kuştin. Nêzikî 600 kes li hevwelatiyên Îranê li derevey Îranê bi destê komara Islamî hatin teror kirin, ku 80 kes ji wana li sinûrên welatên Ewropa de hatin encam dan. Di encama dadigeha bi nav û denge ***Mîkonos*** de îdî bo hemî cîhanê derket ku rêberên herî bilinde Komara Islamî biryara wan terorana dane.

Hêrişên terorîstiye paş şerê Îraqê, nîşan didin ku ne tenê alîgirên rejîma berêye Îraqê, belkî hinek welatên cîran jî destê wan jî têkelî xwîna bi dehan kes ji xelkê Îraqê u hêzên hevpeyman sor bûye. Cîranên Îraq û xasmayî Komara Islamiya Îranê ji vê çendê ditirsin ku Îraq bibe welatek demokrat û li ser bingeha ploralîsta siyasî, çandî û neteweyî bê damezrandin. Tilisma han xewnek gelek nexweş e bo rejîmên dîktator û terorîst perwer. Kuştina Ayetullah Hekîm li roja 23.8.2003 gumanê ne tenê dibin ser alîgirên Seddam, belkî paşerokên welatên cîran û nemaze Komara Islamî jî têde xuyanî dikin. Geşe kirina nirx û bihayên demokrasî û ploralîsmê hêcetek baş e bo kevnaran fermana Cehadê li Îraqê der bikin û bo tepeser kirina projeya Xarîta Rê piştgiriya tund û tîjî û êrîşên xwekujî li Filistînê bikin. Karê han vê hêzên Emerîka li Îraqê asê bike û tengejê di wê deverê de berdewam biket û damezrandina dewleta serbixweye Filistîn û aştiya deverê vê tenê wek xewnek xweş bimîne. Bi vî awayî Îran vê bikaribe bi keyfa dilê xwe cuda hizirkarên navxwe bifetisîne, alîkairya hêzên terorîst bike û di cem wana jî programa xwe ya sazkirina çekên navokî dom bike.

Israîl di piraktîk de tenê welateke li Rojhelata Navîn ku xwediyê sîstemek demokratîk e. Her çend siyaseta dagîrkeraneye Îsraîl cihê şermezar kirinê ye, lê ewa ku welatên deverê ditirsîne berî her tiştekê demokrasiya wî welatiye.

Berî 6 salan dema serok komar Xatemî hat ser kar, wî hevceyiya diyaloga navbera şaristaniyan anî ser ziman. Hevdem di welatê bin hikmê Xatemî de kuştinên rêzokî, terorên bi dizî ve, zîndanî kirina rojnamevan û cuda hizrkaran bi awayek berfireh hat şopandin. Zêdeyî şeş sal serok komariya Xatemî û 24 sal dîroka Komara Islamî hevceyiya rexne ji xwe girtinê derheqî pêwendiyên wê bi mirovên dereve û navxweye sînorên xwe li her demekê zêde rojevtir kiriye. Eger Îran birastî dixwaze li cîhana îro de cihê xwe peyda bike û bibe cihê rêz û qîmetê û eger her wekî balyozê wê Cevad Zarîfî (Time Europe 11.11.1996) gotiye “Îran qurbaniyê terorîzmê ye” ev dibe rexneyên bingehîn ji xwe destpê bike û rêz bo mafê mirove hevwelatiyên Îranê dabinê û dest ji piştgiriya rêkxistinên terorîstî hilbigire. Ji bona bi dest anîna aştiyê li Rojhelata Navîn ev dibe welatê Îsraîlê bi fermî binase û piştgîriya xwe li hêrişên xwekujî biqetîne. Vê demê mirov vê bikaribe bawir bike komara Islamiya Îranê dayka terorîzmê nine.

* Ev nivîse bi zimanê Finlandî bona 11. salvegera terora şehîd Dr. Seîd Şerefkendî li malpera www.kurdistanmedia.org da hatiye weşandin.

www.arsivakurd.org

## Hunermend Cewad Merwanî:

# "Firotina çandê firotina namûsê ye!"

**SALIHÊ KEVIRBIRÎ**
**salihkevirbiri@hotmail.com**

*Cewad Merwanî; di sala 1965'an de li gundê Boşata Farqînê hate dinê. Merwanî, xwendina xwe ya seretayî, nîvî li gund û nivî jî li bajêr bire serî. Xwendina xwe ya bingehîn jî li Farqînê domand. Li gorî gotina wî, "salên wî yên surgûniyê" jî çêbûn. Merwanî ji ber van sirgûniyan nîv salekê li Batmanê û nîv salekê jî li Diyarbekirê xwend. Di darbeya 12'ê Îlonê (Rezberê) de di dema lîseyê de rastî sivikatî û lêdanan hat. Bi qasî sê mehan li Diyarbekirê di Enstîtûya Perwerdehiyê de xwendina xwe domand. Dema ku li Diyarbekirê bû, qeyda xwe li 'Konserwatuara Muzîkê' pêk anî. Demeke kurt di Radyoya TRT'ê ya Diyarbekirê de xebitî. Tiştê ku di radyoyê de jê hat xwestin, nekarî pêk bîne û dest ji karê radyoyê kişand. Ji ber ku jê dixwestin ew gund bi gund bigere û stran, awaz û kilamên kurdî berhev bike, paşî jî li tirkî wergerîne. Di sala 1984'an de di nava gel de dest bi karê hunerî û stranbêjiyê kir. Xebatên wî wekî Kaset û sêlik (CD) derketine pêşberî guhdarên kurd.*

*Cewad Merwanî ev çend sal in ku jiyana xwe li xerîbiyê ango li Almanyayê didomîne û kar û barên xwe yên huner û stranbêjiyê li 'Akademiya Çand û Hunera Kurdistanê' didomîne.*

*Li bajarê Durena Almanyayê li avahiya Akademiyê em bûn mêvanê Cewad Merwanî....*

**Kekê Cewad, jiyana te ya hunerî çawa dest pê kir. Cara ewil tu li ku derê ketî nava karê hunerî. Yekemîn kilama ku te got kîjan bû?**

Cara ewil ez nizanim ku min kîjan kilam got. Di malbata me de her kes ketibû bin bandora olî û hemû hecî û mele bûn. Dengê wan hemûyan xweş bû. Min jî demekê feqîtî kir. Ez diçûm ser banê mizgeftê û min bang dida. Min qesîde dixwendin. Lewre min hingê kifş kir ku dengê min xweş e. Wê êlhamek da min. Paşê min dest jê kişand. Paşê ji bo ku bibim mamoste qeyda min li Enstituya Perwerdehiyê hate çêkirin. Lê min nedixwest ku ez wekî memûr û karmendekî dewletê bixebitim. Min dixwest ez serbixwe bim. Lewre jî min dest ji xwendina mamostetiyê berda. Paşê ez ketim Radyoya Diyarbekirê. Di nava gel de pêşbirke û çalakiyeke hunerî çêbû. Min qezenc kir û ez bûm xebatkarê radyoyê. Armanca wan a bingehîn jî ew bû ku xortên dengxweş ên kurd peyda bikin, wan bibin metropolan û di nava çanda tirkî de bihelînin û ji bo xwe û çanda xwe bi kar bînin.

Paşê teyîbek dan min û ji min xwestin ku ez di nava gel de bigerim û stranên gelêrî berhev bikim. Min jî nedizanî û ez li hemû herêman geriyam. Ji Xerzan heta Diyarbekir, Qulp û Sasonê gav bi gav geriyam û min stranên gelêrî berhev kirin. Min dixwest wan stranan bidim wan, lê çend heval û dostên min ên bi navê Berzan, Salih, Mensûr Cahîd, Cewad nehiştin ku ez wan kilam û stranan bidim wan. Ji min re gotin: "Tu çawa çanda xwe difiroşî. Çawa ku mirov namûsa xwe bifiroşe" Wan ez razî û serwext kirim û min ev kilam û stran nedan wan. Paşê min ji xwe re hildan.

**Te çawa dest bi hunerê kir?**

Ez berê diçûm dawetan. Me bê saz û muzîk stran digotin. Piştî ku teknîk pêş ket, ligel hevalekî xwe me dest bi karê muzîkê kir. Navê hevalê min Hesen bû û ew kurxalê min bû. Ew hê jî karê xwe li Diyarbekirê berdewam dike. Wê demê me bala xwe dayê ku bi du kesan çênabe, me şagirtên nû girtin û me ew hîn kirin. Me di nava salekê de çend şagirt hîn kirin. Me bi kurdî dest pê kir. Ji ber tirsa ku kurdî qedexe bû hin caran jî me bi tirkî digot. Me nedikarî em navekî li koma xwe bikin. Ji tirsa polîsan me nedikarî em xebatê bikin. Li gundan em rehet bûn. Paşê ku gel hinekî em nas kirin û em jî hînî kar bûn, em bi ser ketin.

**Bi qasî ku ez dizanim, tu ji malbateke dîndar (oldar)î tê. Li gel dengbêjî, awaz û stranên kurdî, sewt û awazên tesewûfî û olî jî bandor li te kirine. Ez şaş im gelo?**

Na! tu rast dibêjî. Malbata me li gel ku malbateke şoreşger û welatparêz bû, eynî wext jî malbateke oldar jî bû. Babê min bixwe wekî hunermendekî şareza beyt û qesîde dixwendin. Ew dengbêj nebû lê dengxweş bû. Ez hinekî di bin bandora wî de mame. Melayên gundên me û yên dorhêlê jî bandor li min dikirin. Meleyek jî xalê min bû.

**Me behsa bandorkirinê kir, hate bîra min tu jî wekî piraniya dengbêj û stranbêjan gelek behsa radyoyên kurdî yên wekî Erîvan û Bexdayê dikî. Ne wisa ye?**

Rast e! Gelek tesîr li min kirine Radyoyên Erîvan û Bexdayê. Jixwe dengbêj û hunermendê ku bêja Radyoya Erîvan û Bexda tesîr li min nekiriye ne rast e. Min endam, bêjer û hunermendên radyoyê nas nedikirin lê dengê wan kesan pir li xweşiya min diçû. Eyşe Şanê jî wekî hunermendeke jin bandoreke mezin li min kiriye. Mihemed Arif Cizrawî, Hesen Cizrawî, Şeroyê Biro, Kawîs Axa, Karapêtê Xaço û hwd. Hemû ev liambêjane navên ezîz in ji bo min. Ez her dem feyza xwe ji van navan digirim.

**Wekî din heger tu çend navan li van navan zêde bikî, dê tu çi navan lê zêde bikî?**

Ji herêmê Mehmûd Qizil û Husênê Faro gelek bandor li

www.arsivakurd.org

**Doma rûpelê 11:** **Hevpeyvîn bi hunermend Cewad Merwanî re**

min kirine. Babê min pîlakên wan distandin û min ku lê guhdarî dikir di hişê min de diman. 'Kewê Ribat' Şakiro hatibû Melezgirê û me carekê hev dît. Hevnasiya min bi Dengbêj Zahiro, Salihê Qubînî, Eyşeşan û Mehmûd Qizil re çêbû. Bi taybetî dostaniyekî min û Salihê Qubînî yê baş hebû. Baş tê bîra min şeva ku min terka gund kir, me xatir ji hev xwest...

Te bi kîjanî re stran gotine:

Min bi Eyşe Şan û Xalê Fewzî re stran gotine. Lê ne tiştekî wisa wekî bername yan tiştekî din tenê em bi hev re rûniştine û me kilam gotine. Min ji bîr kir ez bêjim. Rehma Xwedê lê be, bandora rehmetiyê Şiyar jî gelek li ser min heye. Ew yê vê dawiyê bû û bandora wî li ser gel jî hebû.

**Em werin ser rol û girîngiya dengbêjiyê. Li gorî te çima ewqas girîng e dengbêjî û stranbêjî? Rola wê ya di çand û wêjeya kurdewarî de çi ye?**

Salihê Bira wekî tu jî dizanî, ji ber ku arşîva me tunebûye em nizanin ka kilam û stran kengê hatine çêkirin û qewimîn kengê pêk hatine. Lê kilaman bandoreke mezin li ser gel heye.Yanî arşîva zindî ne dengbêjên kurd. Ji ber ku nivîsîn û tomarkirin li welêt tunebûye barê giran hemû maye li ser milê dengbêjan. Bi rastî em deyndarên dengbêjan in ku ew dîrok ji me re xwedî kirine.

Li ser wêjeyê jî rola wan zêde ye. Bo mînak strana Zembîlfiroş. Berî hezar salan li Farqînê dewleta Merwaniyan ava bûye û kilama Zembîlfiroş di wê demê de hatiye çêkirin. Lê em nizanin ku ew di destpêka avakirina dewletê de yan di kîjan demê de hatiye çêkirin, lê em tenê vê yekê dizanin ku dengbêj nebûna niha me kilama Zembîlfiroş nedizanî. Rola dengbêjan di parastina çanda kurdî de gelekî mezin e. Gava ku mirov bala xwe dide gotinên strana Zembîlfiroş mirov lê dinêre ku wêjeyeke gelekî balkêş tê de heye.

**Eger em ji te bixwazin ku tu behsa bîranînekî xwe yê zarokatiyê ku li ser dengbêj an dengbêjiyê ye bikî, tê ji me re çi bêjî?**

Gelek bîranîn hene. (kurtedemek difikire, piştre bi bişirîneke zirav axaftina xwe berdewam dike) Rojekê Mehmûd Qizil û Eyşe Şanê hatine bajêr û her kes çû dîtina wan. Dê li sînemayê konser bidana. Em zarok jî çûbûn ser dîwaran ji bo ku tenê ji dûr ve be jî em bikarin wan bibînin. Çawa ku melayketek hatibe wir û mirov here dîtina wê. Hewçend ku Eyşe Şanê bandor li gel dikir. Mehmûd Qizil jî her wisa. Rojekî xweş bû...

**Dibêjin daweta bêdengbêj ne tu dawet e. Dîtina te çi ye divî warî de?**

Daweta ku dengbêj lê tunebe, kêmdawet e. Baş tê bîra min, dema dawetek çêbûya û dengbêj û stranbêjên wê dawetê tunebûya, digotin; "Werin em herin filanderê, 'daweta bêdeng' heye...!" Ku dengbêj an hunermendek tunebûya tama wê dawetê jî tune bû.

**Ez vê pirsê ji tevahiya dengbêjan dikim. Lewre jî dixwazim tu jî bersiva vê pirsê bidî; Gava tu dest bi gotina kilaman bikî, wê bikaribî çend kilaman bibêjî. Kilamên ku te bi xwe jî çêkirine hene?**

Kilamên ku min bi xwe çêkirine nêzîkî 55 heb in. Ku hinek kuta nebûne. Min hinek ji wan tomar jî kirine. Wekî 'Dayîkê', 'Kekê min ê Penaber', 'Rojhilata Navîn', 'Gelê Kurdistan', 'Ew kî bû ev dil şiyar kir?', 'Evîndarî ne wiha ye', 'Mezra Botan' û 'Sazbendo'

Hinek jî hene ku min ji helbestên Meleyê Cizîrî, Meleyê Bateyî û Seydayê Dilbirîn girtine. Min ji wan re muzîk çêkirine. Ez niha nêzîkî 3000 stranî dizanim. Dibe ku ez hemû strana bi giştî dizanin lê qet nebe ez muzîk û awayê gotina wan dizanim.

**Min bihîst ku tu berhevkirinan jî dikî...**

Belê xebateke min a berhevkirinê heye. Min dil heye, stran û kilalên kurdî berhev bikim û bidim weşandin. Dê ev xebat, ji kilam û stranên gelêrî û folklorî pêk bê. Şêwaz, nota û awayên reqsên wan hemû dê di vê xebatê de hebin. Ezê heta serê sala 2003'yan amade bikim. Fikra min ew e ku navê pirtûkê deynim*"Stranên Kurdî yên Gelêrî û Folklorî"* .

**Cewad can, eve demeke ku tu kar û xebata xwe ya hunerî li mişextiyê, ango ji dûr welêt û li xerîbiyê berdewam dikî. Zehmetiya xebata li dereveyî welat çi ye gelo?**

Ji bo hunermenedek û ji bo nivîskarek, gava bixwaze karê xwe baş pêk bîne, welat baştir e. Ev deh sal in ku ez li Ewropayê me. Tu bawer bike, her şeva ku min serê xwe daniye û raza me, min di xewnên xwe de welat dîtiye. Ez hêjî hînî jiyana li Ewropayê nebûme. Ez hîn nabim jî. Her tişt sunî û beredahî ye. Tiştên xwezayî li vir tune ne. Ji bo hunermendan jî ev yek gelek zehmet e. Xerîbî zor zehmet e. Mirov dikeve nava tengasiyan. Li vir her cure derfetên teknîkî hene lê germahya gel û xebatê kêm e. Lê li welêt ne wisa ye. Ku xebata em li vir dikin heger me li Diyarbekirê bikira, ez bawer im niha 500 şagirtên min hebûn.

**Mamoste Cewad, zor sipas ji bo bersivdayîna pirsên me. Mala te ava...**

Mala te avatir. Bi riya vê gotûbêjê ez dixwazim peyamekê jî bidim. Ez hêvîdar im ku kesên li ser hunerê dixebitin, bila li çanda kurdî hûr bibin û lê xwedî derkevin. Bila berhemên xwe nedin talankirin û dizîn. Her wiha bila berhemên xwe yên gelêrî berhev bikin û bi pêş bixin.

********

www.arsivakurd.org

Doma rûpelê 20

# Sedsaliya ji dayik bûna Cigerxwîn pîroz be



**Xwendin nebe kes naçe pêş,**
**Peyda dibin pir derd u êş,**
**Her dem di bin destê neyar,**
**Em dê bidin xûkî û bêş,**
**Ev tac û şewket xwendine,**
**Ev dîn û dewlet xwendine,**
**Ev serbilindî xwendine,**
**Ev dewlemendî xwendine,**

Cigerxwîn di helbestên xwe de her gav li ser wan tengavî û bê çareiyê ku millet tê da bûye nivîsandiye û şûnwarê hovîtiya dijminan li ser jiyana gel daye eyan kirin û rewşa welat wisan aniye ziman:

**Dijmin hilveşand tev gund û bajar**
**Zar û zêçên me jar ber dîwar**
**Li jor balefir, li jêr tang û top**
**Ji xûnê sor bûn hemû şûn û şop**
**Welat carek dane ber şewat**
**Milet Perîşan, bê kar, bê xebat**
**Birçî, û tazî, hemû perîşan**
**Bê mal û bê cî, ne xev, ne razan.**

Cigerxwîn bi helbestên xwe tovê netewe perwerî û welatparêziyê direşand û bi bingeh girtina vê bîr û bawerê, rêya xebat û berxwedanê nîşanî keç û kurên Kurdan didan û bi helbestên weke: Kîne Em, Herne Pêş, Şam Şekire Welat Şirîntire û … gelekên din, karî hêza pangiriye gel di hemberî dijminan de biteqîne û bibe pêşengê helbestvanên şoreşger di vî çaxî li Bakûrê Kurdistanê de.

Evî baweriyek mezin bi rolê wekheve Jin û Mêran di nava civakê de hebû û bo nav birina evan qeyd û bendên paşveroyî, ku nedihêla keç û jinên Kurd bikevine xebatê, di helbesteke xwe de wiha gazî keçên Kurd dike:

**Keçê rabe, serî hilde, di vî çaxî weha nabî,**
**Binêr, jin çune ezman, heta kengî di xew da bî,**
**Çine ev çarik û peçî di rextada xwe rapêçî,**
**Bi destê te keleşînkof, bila zana û xwenda bî**

Cigerxwîn dilxweşiya xwe derheq serkeftina Kurdên Îranê di sala 1946an de ku Komara Kurdistanê bi destê rêberê Parta Demokrata Kurdistana Îranê Qazî Mihemed hate îlan kirin, bi vî awayî tîne ziman:

**Xakî Kurdistan bî qurban, pir ciwan û paqijî,**
**Xwîn rijandin pir kurên te wa li her alî rijî,**
**Miletê Kurd ta ku saxe ev ji vê rê nagerî,**
**Aferî, Aferî, Qazî Mihemed Aferî**

Cigerxwîn ne tenê helbestvan, belkî zimanzaneke pêşenge gelê me bû ku kar li ser her du zaraveyên sereke ye Kurdî (Kurmanciya jorîn û jêrîn) dikir ta ku şarazayiyek baş peyda biket û li danîna rêzmana Kurdî de wan du zaraveyan bi hev re bixebitînît û bibîte serçopîkêşê şayîrên serdemê xwe û li ser zimanê Kurdî bi vî awayî hizra xwe eyan kiriye:

**Vejîne zimanê xwe, ey xwendevan**
**Nebûye milet hîç kesek bê ziman**
**Zimanê me xweş û xuroş û ciwan**
**Eger baş bizanî tu nakî ziyan**
**Tu Kurmanciya xwe ji bîr nakî**
**Eger baş nizanî, divê zêde kî ….**

Cigerxwîn cuda ji afirandina 8 dîwanên xwe yên welatparêzî, şoreşgerî û evîndarî bo gelê Kurd ku rêya rewşenbîrî, mirovanetî, aştîxwazî û wekheviyê nîşanê gel da, her di vê demê de jî helbestvanekî Enternasyonalîst jî bûye û vî baweriyeke mezin bi azadî, aşitî û birayetiya navbera gelan hebûye.

Ev helbestvan û mirov hezê mezin di sala 1984 an de, li welatê Swêdê di xerîbî û hesreta azadiya Kurd û Kurdistanê da çû ber dilovaniya xudê. Cigerxwîn li cihê xwe da ev xizîna dîwanên xwe ku dermanê kul û derdê gelê me ne, bo me bi cî hêlan.

Lewma hewceye gelê Kurd xwe bextever bizane ku helbestvanek mîna Cigerxwîn bi xîret, dilsoj û Kurd perwer hebûye û vê heta hetaye nav û ramanên Cigerxwîn bi qedr û qîmetek mezin wa di nava dil û mejiyê xwe de biparêzin.

## Gotinên Mezinan

❍.Her dem tiştê xirab, bi xirabî û tiştê baş bi başî dibîne, bêy vê ku tu bizanî xwediyê vê kê ye.

❍.Ne hinde hişik be ku bêyî şikandin, ne jî hinde nerm be ku wekî berikê bêyî bêçandin.

❍.Ne mehtê tiştekê bike, ne jî dijûna jê re bide.

❍.Rêncberê xwe be, axayê mala xelkê nebe.

❍.Şola bike bi esas, bila dilê te nebe weswas.

❍.Ev dostê te ye ku te digirînît nek evê ku te dikenînît.

❍.Karê îro nehêle sibê re.

❍.Xwe mezin neke, da ku tu neşkêyî.

❍.Hindikê bide ber dasê, bila tu nemînî asê.

❍.Nebe kevçiyê hemû girarekê.

❍.Bidî biyanî, goştê ranî, vê li ser te da bihêt poşmanî.

❍.Tu çi biçînî, tu vê dihilînî.

❍.Nan bidî segan, belê nedî bê sifetan,

❍.Nanê tirsiye xwe nede goştê bi mineta xelkê.

❍.Heta kanî hebe, ava cihê nevexwo.

❍.Bo biyanî çende bikî, li dûmahiyê her poşmanî.

❍.Ne Gamêşê bike Mêş, ne jî Mêşê. bike Gamêş.

❍.Here nav miletan, bila bigrî adetan.

❍.karê demekê, ne de axifitina salekê.

❍.Tişta Aqil qebûl neke, bawir neke.

www.arsivakurd.org

# Vehandina Hozana Kurdî

Çengîz Temeryan



Dîroka hozanê vedigere ser dirêjahîya pêkhatin û hebûna ziman. Hem mirovên destpêkî û hem mirovên medenî, di hemû devranan da ev bi kar anîne û di hemû welatan da hozan gotine û xwandine. Di wê navberê da ev pirsyare dête holê ku çima hozan hatiye û hozanvanan bo çi mebestekê divehîne?
Derheq wê pirsê bersivên cur bi cur hene, yek ji wan bersivan eva hane ku hozan sehekê ji jînê didete mirovan. Me wek civatekî sivîl pêdvîyekî gelek hindurî bi wê çendê heye ku em bi canekî pir bûy, kûrtir û baştir bijîn.

Kakila hozanê tecrube ye, hozanvan paşkokên zanînên pêştir, ku ji wê jî pêştir seh û dîtin û têfikirîn hilbijartîye bi hevre girê didet û zanînên nû di ziman da diafirîne ku ev jî di çarçovekî dîyarî kirî da dihên formole û rêxistin. Xala herî bihagiran di vê afirandinê da eva hane ku di wê ser û bendê da xwandevan jî dê bikarît ji wê zanînên nû da pişikdar bît û mifahê ji wê vergirît.

Bi vî awayî hozanê du mijar hene, di destpêkê da dikare wek amrazekê bi kar bihêt, ku heta zanînên me ên çandî û edebî, zimanvanî baştir û kûrtir biket û tevî rewş û kawdanên niha webir bin. Ji alîyê din ve mîna neynûkekê tim zanînên me di nav wê da saf û temîz bin, anku kakilekî xwedî mifah hebe û kesên din bikarbin vêcê jê wergirin.

Serdemê Impiratorîya Usmanî û Şahê Sefewî serdemê geş û xurt bûna çanda Kurdî bûye. Lê hozana Kurdî çavan e û Kurdan ji kengî were dest bi vehandina hozanê kirine?

Heger bi hûrî em bal û deyna xwe bidin dîroka Kurdistanê, ya ku niha li ber destan daye dê ji me re ron bît ku hêjî dîroknas û edîban nekarîne dîroka serrast a hozana Kurdî peyda bikin, li gor dîrokê hozanvanên herî mezin ên Kurdan di çaxê desthelatdarîya Impiratorîya Usmanî û Şahên Sefewî da peyda bûne. Netewa Kurd xwediyê dîrokekî kevnar û tijî xebat û berxwedaniyê ye dijî hemû rijîmên ku Kurdistan dagîr kirine, bi taybetî evên ku bi merema tepeser kirina vî gelî li ser çand û kultora netewa Kurd rêkeftine. Dujminên gelê Kurd di pêvajoya dîrokê da çi gavekê xemsarî ji bo binbir û bin ax kirina gişt warê rewşenbîrî û edebî û çandî û rûyên bajêrvanî a gelê Kurd nekirine. Bo nimûne şewtandina Pirtûka Mem û Zîn a Ehmedê Xanî di Stenbolê da. Lê bi her terzê heyî, hin berper ji wan berperan di nav çengên wan da derkevtin û ronahî dîtin, wek Şerefname ya Şerefxanê Bidlîsî ku serbora Kurdistanê di warên (siyasî, civakî, edebî, çandî)di wê da bi zimanê Farsî hatiye nivîsandin. Lê evên din hemû bi destê bîhanîyan û bi dilê wan û li gor qazancê wan û bi merema veşartina warê rewşenbîriya Kurdî hatine nivîsandin. Di serdemê Mîrên Kurdistanê de hozana Kurdî heya qasekê di hewayekî serbest da hatiye vehandin, çi evên ku wek pirtûk hatine nivîsandin an dev bi dev hatine parastin heta gihîştine vî serdemî: Wek Şerefxan di bêjît: Di serdemê Cizîrî da Mîr Şeref Mîrê Cizîrê bûye û cizîrî du parçe hozan jê re gotiye.

**"Ey şahen Şahê moezzem, heq nigehdarê te bî**
**Soreyê îna Fetehna devr û berê te bî"**

Û paşê sibêjît:

***"Ne tinê Tebrîz û Kurdistan li ber hikmê te bin,***
***sed wekî Şahê Xurasan di fewarê te bî"***

Belê hozana Kurdî vedigere berî mîrên Kurdistanê ku diyare dagîrkerên Kurdistanê nehêlane dîroka wê bi awayekî kilasîkî ku hebûye were nivîsandin û parastin.

# Penaberî

**Xebat**

Bi hezaran sala mi di go, ez li virim û ji vir naçim
Axê jî di go bindestî zore, bê te ez jiyan nabim
Min ji dar û gul û kulîlka re got, şalûl û bilbil û bazim
Ji dîrokê heta niha, serê min bilinde , xem tinê îro jar û belengazim
Destê min ji te nabe welat, ez dev ji te bernadim
Ji aşûr heta niha şûr li destê mine, her û her wî di badim
Ez lawê kurd nevîyê kawa, zerdeşt û rostemê zalim
Xwedan dîrok û hunerim, jîrim ne nezanim
Tim ji bo te welatê min , bi ahîn û keser û fixanim
Rûpelê dîrokê weke,,ez her bi kuştin û talan û fermanim
Lawê kurdim ez, xwedanê lalişa nûranî, û kurdistanim
Aşûr, Ereb û Tirik hatin, bi min nikarîbûn, ez ne helandim
Ji bo berjewend û mafên xwe, nefî kirim, li gelek cîya gerandim
Lê kesî bi min nikarîbû, ji reh û kokê, ez neqetandim
Bi fin û xap û dirava, ez vê carê xapandim
Lê sed heyîf sed mixabin,ji welat dûr kirim
Rehê dilê min kolan ,ji nav de ez hejandim
Gelo çi bû hat serê min,ez li parîs û berlînê gerandim
Bi çend hêvîyên pûç û vala , ji nav de wan ez hejandim
Ka welat,ûrif û adet , vê carê te ez mirandim (Penaberîyê)

www.arsivakurd.org

# Feqiyê Teyran dengê Kurdistanê

**Kurmanc Hakkî**

**Ey avê avê avê av**
**Ma tu bi eşq çû mehbet î?**
**Mewc û Pêlan tavê belav**
**Bê sekne û bê rehet î**
**Bê rehet û bê sekneyî**
**Yan aşiqê baxuwê xweyî**
**Yan şubhetê qelbê meyî**
**Ji eşqa kî natebitî?**

Ew bikra evînê ya ku berî çarsed salan di nav dilê Feqiyê Teyran de dabû der û bi evîna Melayê Cizirî û Seydayê Xanî re tev de bûbû çemekî bi hêz, ku îro jî bi hemî coş û zelaliya xwe ve diherike û wekî şêlaleyeke ji ava heyatê bi ser dilên evîndaran dibare.

Ev ava pîroz zada jînê û tilisma vejînê ye, ku her dilopek vê avê ji nav dilê siruşt û şehrezahiya Mezrabotan nisiliye û li zozanên Kurdistanê daye der. Her kesê ku qurtek ji vê avê vexwariye gianek nemir bi dest aniye.

**Ji eşqa kî her tê û tê**
**Heta kengê her bê û bê**
**Bo min bêje heyranê kî yî?**
**Da ez bizanim Qesetê**
**Da ez bizanim vê sirê**
**ji hindikê heta pirê**
**Ji min meiniya vê gurgurê**
**ji kê ra dikî vê ta'etê?**

Şêxê Senanî yan Feqiyê Teyran yek ji her sê situnên toreya Kurdî ye. Ev hersê giregir û rêzanên hîmê toreya Kurdî, Cizîrî, Teyran û Xanî ne.

Şêxê Senanî stranek bê dawî honaye ko ev çend sed sale li ser xaka Kurdistanê deng vedide. Teyr û tilûrên Kurdistanê timî bi zimanê Feqiyê Teyran diaxivin û bi stranên wî radizên û radibin. Şalûl û bilbilên Kurdistanê mehbeta xwe ya li gel gul û sosinan bi helbestên Feqî direngînin û dixemilînin.

**Min diye muhbet çi reng e**
**Suht e, dijwar e, pereng e**
**Min mudam dil jê beheng e**
**Bi nalîn û efxan im ez**
**Nalîna teyr û tuyaran**
**Kalîna çeng û bilûran**
**Xulxulîn di qesr û qusûran**
**Bilbilê xweşxan im ez**

Li Kurdistanê tu kevir, tu av, tu dar û tu ajal nînin ku bi zimanê Feqiyê Teyran nizanibin. Feqî zimanê Kurdistanê ye û Kurdistan jî evîna Feqî.

Di nav gelê Kurd de gelek gotin û mesele li ser Feqiyê Teyran têne gotin. Di nav van gotin û meseleyan de mirov dikaribe hemû rengên mirovanî, dilpakî û dilsoziyê bibîne.

Fêqî mirovek dilpak bûye û xwastiye ku cihê ku ev lê dijît tu neheqî lê çi nebe û kes heqê



kesê nexot. Bo vê yekê jî gelek digere hetanî di gundekê bi navê Şandîsê li devera Bidlîsê mala xwe ava dike û hetanî dawiya temenê xwe vêrê dimîne. Gundî pir hejî Feqî dikin û wî wek mirovek pîroz û muqedes di bînin. Tê gotin dema Feqiyê Teyran diçe dilovaniya Xudê, gundiyên wî ji Wezûzê ku gundekî nizîkî Miksê ye, têne gundê Şandîsê ku termê Feqî bibin li Werzûrê bispêrin axê. Lê Şandîsî vê yekê qebûl nakin û dibêjin ku ewê Feqî li gundê xwe veşêrin.

Li ser vê yekê gengeşe li navbera her du aliyan de çê dibe. Melayê Şandîsê radibe û du tabûtan dide çêkirin û ji her du aliyan re vî tiştî di bêje: "Herin ji xwe re binivin; dema bû sibeh rabin hûne li mizgevtê du tabûtan bibînin. Lê divê her aliyek ji ber xwe ve bê deng rahêje tabûtekê û bibe."

Gel vê gotina mela qebûl dikin û diçin dinivin. Serê sibê hem Werzûrî û hem jî Şandîsî diçin her yek radihêjine tabûtekê û radikin. Her du alî jî dema tabûtê radikin dinêrin ku tabût tijiye û Werzûrî jî Şandîsî jî dibin her yek gorekê çêdikin û tabûtê datînin.

Bi vî awayî îro li gundê Miksê Werzûrî jî û li gundê Hîzanê Şandîsê jî gora Feqiyê Teyran heye. Lê gora Feqî ya rastî kîjane kes baş nizane. Her du gorên Şêxê Senanî îro jî ziyaretgeh û cîhê pîroze Kurdane. Niha jî xelkê devera Wan û Bidlîsê hemû salê li Tîrmehê de hemî eyiniyan diçin ser gorên wî yên pîroz û rojên Feqiyê Teyran bi cejn û şahî di bin ser.

**Ez çi bêjim çi beyan kim**
**Mexfiyatan ez eyan kim**
**Sirê dilê eşkera kim**
**Kes bi halî min nezan**
**Çendê bejim sir û halan**
**Ah ji destê çav xezalan**
**Her dinalin mah û salan**
**Kes bi halê min nezan**

Helbest û dîwanên Feqiyê Teyran gelek bi kêmî hatin berev kirin. Cara yekem dîwana Feqiyê Teyran li Bexdayê bi tîpên erebî ji aliyê Seîd Derwêşî hate berhev kirin û di sala 1999'î de Enîstîtoya Kurd li Stenbolê dîvana han bi navê ***"Ey avê av"*** bi pîtên latînî weşandiye.

**Dil ji min naket xeyalan**
**Bûme perwana şemalan**
**Bêriya husn û cemalan**
**Ay dilê min ay dilo**
**Can fîrêtim te nebînim**
**Deftera eşqê bixwînim**
**Serxweş û sukran û dînim**
**Ay dilê min ay dilo.**

www.arsivakurd.org

# Xatûna Şîrîn Ebadî û wergirtina Xelatê Nobel a Aştiyê (2003)

**Azad Kurdî**

Xelatê Nobel a Aştiyê îsal gihîşte parêzvana mafê mirovan Şîrîn Ebadî. Komîteya Nobel li Oslo, xelatê Nobel a Aştiyê li sala 2003an bi sedema xebata wê ji bo parastina mafê mirovan (bi taybet mafê jin û zarokan) û demokrasiyê li Îranê de bo wergirtina vî xelatî hate hilbijartin.

Piştî berbijêr kirina Rêberê şehîde PDK Îranê, Dr. Ebdulrehman Qasimlo bo wergirtina wî xelatî di sala 1989 Zayînî de ku yekem Îranî û yekem Kurd bû ku ji bo Xelatê Nobel a Aştiyê hatibû berbijartin, Şîrîn Ebadî û Haşim Axacarî duyem Îranî yên berbijarê xelata Nobel a Aştiyê bûn. Ebadî 11mîn jina cîhanê û yekemîn jina Misilman e ku kariye wî xelatî bi dest ve bîne.

Wê piştî ku nûçeyê xelat kirina xwe bihîst, ragehand, ku ev biryar ji bo mafê mirovan li Îranê û bi taybetî ji bo zarokan tiştekî giranbiha û hêja ye.

Ebadî Parêzvan, nivîskar, memostayê zanîngehê, vekolînker û xebatkarê civakî û mafê mirovan li 31 Cozerdana 1326 Rojî (1947 Zayînî), ji dayîk bûye. Niha temenê wê 56 salî ye. Sala 1347 Rojî (1969 Zayînî), yekemîn jin bû ku li Îranê bû dadmend. Lê piştî serhildana sala 1979'an û bi deshilat gihîştina Komara Îsalmî ew hate neçar kirin ku dest ji wî karî ber bide. Li gor Qanûn (zagona) bingehîne Îranê jin li hin aliyên jiyan û têkoşîna civakiye xwe ji mafê beramber weke mêran bê par in. Mîna rênedana xebata wan bo dadmendî yê, hilbijartin bo Serok Komariyê û hin çalakiyên din, ji wan bê pariyane ne. Di civaka Îranê de deshilat û yasa bi awayên cur bi cur sivikatiyê bi kesayetiya jinan dikin û ev li mafên mirovî û azadiyên sereke bê par kirin e.

Nûçegihanê fermiye Komara



Îslamî a Îranê, ÎRNA, nûçey dana xelatê Nobel a Aştiyê bi Şîrîn Ebadî, bi kurtî û zor jî direng weşand. Ew vê kiryarê bi pîlana dijminan û **"îstikbar"**a cîhanî dizanin!

Ji aliyek din rayedarên Îranê xelatê Ebadî bi nîşaneya pişkdariya zaf xurt a jinên Îranî li rojeva siyasî û civakî dizanin. Lê vê rastiyê ji bîr dikin ku navhatî ji ber beyan kirina hizr û ramanên azadîxwazane û berevanî ji mafê mirov, azadî û demokrasiyê çend car ji aliyê wê rejîmê ve hatiye girtin û mehkeme kirin. Hejî gotinê ye, wergittina xelatê han ji aliyê Ebadî ve bo tevgera azadîxwazane ya gelên Îranê serkeftinek mezin e.

Ebadî Xelatê Nobel a Aştî ya îsal ku qîmeta vê 1 milyon û 300 hezar Dolar e, tevî mîdala şanaziyê werdigire. Ji girîngtirîn û navdarên mezin e berbijêre wergirtina wî xelatî "Pap Jan Polê duyem" Serokê Katolîkên cîhanê, Watslaw Habil Serok Komarê welatê Çik û Lix Walsa Serok Komarê pêşîne Lehistanê bûn.

**Wergirên xelata Nobel a Aştiyê di çend salên bihorî de evanê jêrîn in:**

2002: Cîmî Kartir Cunyor, Serok Komarê pêşîn yê Amerîka

2001: Kofî Enan, Sekreterê Giştî yê Neteweyên Yekbûyî

2000: Kîm Daê Cong, Serok Komarê berê ye Kureya Başûr

1999: Rêxistina Duktorên bê sînor (MSF, li welatê Firanse)

1998: Can Hîyom û Deywîd Tirîmbêl li Îrlenda Bakûr

1997 Rêxistina Navnetewî a mîn gilgirtinê, bi serokatiya " Codî Wîlyamz"

. . .

## Îran mezintirîn girtîgeha rojnamevanan

Rapora salane ya saziya nûçegihanên bê sînor, Komara Islamî ya Îranê tevî 6 welatên din wekî wan dewletên mezin nav bir ku azadiya weşanê di van da bi rijdî tê pelçiqandin.

Ev rapore ku li Parîsê belav bûye, gotiye Komara Islamiya Îranê di bin pê kirina azadiya weşanan û mafê rojnamevanan de li navbera 166 welatên dinê de, li refa 160ê de cih girtiye.

Li gorî vê raporê di sala 2002an de 16 welat di qedexe kirina weşan û tepeser kirina rojnamevanan de ji Komara Islamî pêştir bûn. Di halekê de di rapora salane ya 2003'an de hatiye dest nîşan kirin ku tenê 6 welat li pêşiya Komara Islamî mane. Li dirêjiya vê raporê de hatiye ku kes nikare li welatên mîna: Kureya Bakûr, Birme, Laos, Çîn, Îran, Tirkmenistan û Viyetnamê de rojnameyek serbixwe hebe. Rojnamevan di van welatan de ji çi mafekê xwedî par ninin û bo kar û canê van jî çi tenahiyek tu neye û ev neçar in di rewşekî herî ne baş de bo karê rojnamevanî û gihandina zanyariyan bixebitin û hejmareke zaf ji rojnamevanan bi xasmanî di girtîgehên welatên weke: Birme, Çîn û Îranê de hepsî ne. Saziya nûçegihanê bê sînor, Îran weke mezintirîn giretîgeha rojnamevanan di Rojhilata Navîn de daye nas kirin.

**Jêder: Radyo Ferda**

www.arsivakurd.org

# Derheq cinayeta nû ya terorîstî li bajarê Kerkûkê

Li gor ragehandina Melbenda Rêkxistina Kerkûkê ya Yekîtiya Nîştimanî a Kurdistanê, demjimêr 13:30'ê pêşnîveroya roja şemî 20.11.2003'ê, di kiryareke terorîstî de du otombêlên curên "**NISSAN**" li çar riyên hember baregeha Melbenda 2' ya Rêxistina Kerkûkê ya YNK'ê de teqîn ku tê gotin ku pitir ji 100 kîlo **TNT** û guleyên topan tê de hatibûn bi kar anîn. Di encamê de 4 kesan jiyana xwe ji dest da û 33 hevwelatiyên Kurd, Ereb û Tirkman ku pişkek ji wan zarok bûn û ji xwendingehê dizivirîn hatine birîndar kirin. Ev teqîne di çaxekê diqewime ku qirar bû Balyozê Watîkanê di vê rojê de bihê Kerkûkê û **Metranê** nû yê Kerkûkê dest nîşan bike.

Her çi qas xelkê Îraqê zêdetir ji wê rojê nêzîk bibin ku deshilat di wî welatî de bi yekcarî bikeve destê nûnerên hilbijartiye wan, nigeranî û tengijiya dijminên cêhgir bûna aştî û azadî û demokrasiyê di vî welatî de zaftir dibît. Evan çavên dîtina cêhgir bûna aştî, tenahî, asayîş û azadiyê bixasmanî li Kurdistanê nine, ev rastiya han jî ku bo cara yekemîn di dîroka Îraqê de Kurdek serokatiya wî welatî diket wisan jê kiriye ku bixebitin Kurdistanê jî bikene qada xulqandina cinayet û cî bi cî kirina nexşeyê terorîstên xwe.

PDK Îranê, kiryara nû ya terorîstî li Kerkûkê û hemû cinayet û kiryarên terorîstî ye wan li her ciheke Kurdistan û Îraqê bi rijdî şermezar diket û tevî beyan kirina serexweşiyê, hevderdiya xwe tevî malbata goriyên vê cinayetê jî beyan diket û silametî û baş bûna zû ye birîndaran bi hêvî dixwaze. Her di vê demê de jî daxwazê ji Partî û Rêxistinên Kurdistana Başûr û akinciyên vê pişka Îraqê dike ku bi hişyarî û hevgirtina xwe, pîlanên dijminê aştî û azadî û demokrasiyê di Îraqê de bê encam (pûç) bikin û pêşiya dubare bûna wan cure kiryarên terorîstî bigirin.

# Şandeke Partiya Demokrat seredana Wezîrê Derve li hikûmeta pêşeroja Ustiraliyayê dikin

Roja 18.11.2003'an Şandek ji endamên partiy pêkhatî ji hevalan: Selah Pûr Esed, Mesûd Pîran û Osman Senbolî li bajarê Birîzbanê tevî birêz Kîvîn Rod (Kewin Rodd) Endamê Parlemana Federal ya Ustiralyayê civîyan. Kîvîn Rod berpirsyarê penaberên derve yên Parta Karkerên Ustiralya ye û Wezîrê Derve yê Partê li hikûmeta pêşeroja a Parta Karker e.

Şanda Parta Demokrat di berahiyê de basa rewşa Îran, terorîzma Komara Islamî, tepeser kirina gelê Kurd û bin pê kirina mafê mirovan kirin. Paşan lîsteyek ji navên wan kesên ku di vê dawiyê de bi destê rijîma Komara Islamî hatine kuştin, dane birêz Rodd.

Li dîv re li ser girtin û bi dest dana 6 xebatkarên demokrat bi Komara Islamî ji aliyê Bizava Îslamî a Kurdistanê ve, axivîn. Her wisan qala der çûna hikmê îdamê bo Ramîn Şerîfî, endamê PDK Îranê û girtina çend kes ji xebatkarên PDK li herêma Mehabadê bo birêz Rodd kirin û di wê derheqê de daxwaza alîkariyê ji wî kirin. Kîvîn Rodd tevî beyan kirina hevsozî û hevderdiya xwe tevî bizava gelê Kurd soz da ku di riya xwe we cehd û bizavê bidet ji bo ron û zelal bûna qeder û çarenivîsa girtî û bê ser û şûn kiriyên Parta Demokrat û pêşgîrî kirin ji rêveçûna hikmê îdama Ramîn Şerîfî. Piştre basa endam bûna her du Part (PDK Îranê û Partiya Karkerên Ustiralya)yê di Entirnasyonala Sosyalîst de û pêdivî û hevce bûna pitire alîkariyan di navbera wan du Partane de hate kirin.

# Evîna min kê tu êşandî

Sadiq Eskerî

Min divêt te hergav
hembêz kim,
min divêt mîna çîyan
ku ba hembêz dikin
ji tere bibim şemala kore rêyan.

Evîna min kê tu êşandî
wî zarokê zik birsî û êtîm, yan
minê evîndarê bê guneh

Evîna min ma tu nizanî
ez û tu û ev zarokê
zik birsî û êtîm, ji
yêk can in û ji bo
yêk merem dimirîn û dijîn

www.arsivakurd.org

# Ebdula Hesenzade, Sekreterê Giştiyê PDK Îranê, bû berbijarê wergirtina Xelatê Fond ya bîr anîna Olaf Palme




Ji Fonda bîr anîna Olaf Palma û bi navê Yuwakîm Îng Kust )Yoskim Engqvist) ve bo birêz Hesen Qehremanî, berpirsyarê Têkiliyên Partiya Demokrat li Swêdê:

Bi vî awayî, we agehdar dikin ku berbijar kirina rêzdar Ebdula Hesenzade di civîna desteya serokatiyê de hate ber bas û rawêj kirinê û piştî vê behs û rapirsînê Ebdula Hesenzade hate berbijar kirin.

Desteya Serokatiyê vê di demsala Payîzê de li ser wî kesî/ê ku xelatê Olaf Palme bi vî bihê dan, biryara xwe ya dawîn bide û piştre dê daxuyaniya çapemeniyê di wê derheqê de bihê weşandin.

Tevî rêz û silavan
Yuwakîm Îng kust (Yoskim Engqvist)
Fonda bîranîna Olaf Palme
(Novambra 2003

# Hilatina mejiyan li Îranê ??

**Enbê**

Demekê berî niha Xizîneya Navnetewî a dirav (Pere), di serhijmêriyekê de da zanîn ku Îran di nava 91 welatên ne pêşketiye cîhanê de yekem e!

Ji gorî vê serhijmêriyê di salê de 150 heya 180 hezar kes ji xwendevanên Îranî welatê xwe bi cih dihêl in.

Belavoka ***Bername*** ser bi rêxistina Bername û Budce ya Komara Islamî nivîsand ku: “90 kes ji wan 125 kesên ku di sala bihorî de li Olempiyadên zanistiye cîhanî serkeftin bi dest ve anîbûn, niha li zanîngehên Amerîka de dixwînin.”

Em dikarin azadiyê di her welatekê de bi giştî li ser 2 aliyên bingehîn pişk bikin: 1. Azadiyên Siyasî (mîna beyan kirina hizr û ramanên siyasî, pişkdarî kirin di pêşeroja siyasî ye welêt de) 2. Azadiyên civakî (mîna wekhev bûna hemû xelk di warê Nejad, ol û baweriya wan de).

Sedemên hilatina nifşa avedanker û çêkerê pêşeroja welat li tu kesê veşartî nine. Li serdemê deshilatdariya Şahenşahî li Îranê, azadiyên civakî hetanî qasekî zor hebûn, lê azadiyên siyasî tu nebûn, her bi vê sedemê xelkê neyar û dijebere siyasetên dewletê koçberî welatên din dibûn. Piştî serkeftina serhildana gelên Îranê li sala 1357'ê Rojî (1979 Zayînî), li gor vê pîvana ku me di serî de bas kir, him azadiyên siyasî û him jî azadiyên civakî li xelkê hatin berbest û qedexe kirin. Rewşa han bo ciwanên azadîxwaz e Îranê nehatiye qebûl kirin.

Goriyên esliye wê pirsgirêkê nifşa ciwan in. Kiryar û siyasetên çewt û xirabe Komara Îslamî a Îranê di zanîngeh, xwendingeh û ciavkê de tevî ciwanan ev rewşe afirandiye. Îro rojê nebûna kesên pispor û jêhatî li hemû dezgeh û îdareyên welat de tê dîtin.



Rayedarên rejîmê 24 sal e dibêjin dibe sebebên wê pirsgirêkê bihên ber lêkolîn û çareserkirinê! Lê bi rastî rewş li vê çendê aloz û xirabtir e ku ev rêçarên ku karbidest û rayedarên rijîmê pêşniyaz dikin, bikarin vê nesaxiyê derman bikin. Ev girêpêçkane tenê bi nemana Komara Islamî û cihgir bûna hikûmeteke pêşkeftî û demokratîk, bihên çareser kirin.

Li derweyî welat alîkariyên maliye xwe bo Parta Demokrata Kurdistana Îranê bidne wê hisaba bankî:

C.C.P PARIS 68040
M020
FRANCE
Fîşeya bankiye vê jî bo vê adresê Poste bikin:

A.F.K.B.P.102 75623
PARIS CEDEX 13
FRANCE

Hejmar Telefon û Fax
A pêwend girtin bi Radyo Dengê Kurdistana Îranê re:

**Telefon: 00871762280073**

**Fax: 00871762280074**

www.arsivakurd.org

# 22'mîn Kongireya Entirnasyonala Sosyalîst dawî bi karên xwe anî

Di rojên 27,28 û 29'ê Oktobra 2003'e Zayînî de, bîst û duyemîn kongireya Entirnasyonala Sosyalîst li bajarê ***Saopolo*** ya welatê Birizîlê hate li dar xistin. Di vê kongirê de zêdetir ji 140 şandên noneratiyan li seranserê cîhanê tê de pişkdarî kiribûn.

Ev pirsên ku di kongirê de ketine rojevê, pêkhatî bûn ji pirsên bihagirane cîhanî mîna: Pirsa xurt bûna berdewam û ewlekariya cîhanî, rolê nû yê Civata Navneteweyî anku Rêxistina Neteweyên Yekbûyî û hewcehiya pêkanîna guhertinên baş di vê rêxistinê de, bazirganiya navnetewî û pirsa cîhgir kirina wekhevî û edaletê di bazirganiyê de û her wisan pirsa kar û jîngehê, cehd kirin bo zeliqandina aştiyê di rêya pêşgîrî kirin li şer û çareser kirina alozî û pirsgirêkan, birsîtî û dadmendiya civakî, zêde kirina nexş û rola hevwelatiyan di rêya bi hêz kirina Rêxistinên Demokratîk di civatgeha bajêrvaniyê de.

Parek din ji kar û xebatên kongirê pejirandina "Sened" û biryarnameyan û hilbijartina rêveberî û berpirsên saziyên cur bi cure Entirnasyonala Sosyalîst bûn ku pişkek ji wan evane bûn: Rapora Sekreter bo Kongirê, biryarnameya giştiye Kongira 22'yan bi navê ***biryarnema Saopolo***.

Parek din ji rapora Sekreter bo kongirê, taybet bû bi pirsa Kurd û çelengî û têkoşîna Entirnasyonala Sosyalîst di vî warî de, her wisan kongireya 22 ya Entirnasyonala Sosyalîst di biryarnama xwe de biryarnameyek jî derheqî Îranê pejirand.

Şanda pişkdare PDK Îranê pêkhatî bûn ji hevalan: Xusro Ebdulahî, Berpirsê Buroya têkiliyên Partiyê li derveyî welat û hevalê Xalid Ezîzî nonerê Partiyê li Amerîka.

Şanda partiya me di vê kongirê de tevî hejmarek kesayetî û şandan derheqî pirsên cîhanî bîr û hizrên xwe guherîn û nameyek pêşkêşî kongirê kirin.

Di vê namê de piştî şîrove kirina rewşa Îranê, daxwaz ji Entirnasyonala Sosyalîst hate kirin ku piştgîriyê ji xebata xelkê Îranê bikin, ku bûye sedema pejirandina biryarnameyekê derheqî Îranê de.

Hejî gotinê ye ku di nava partiyên Kurdistanî de, ji bilî PDK Îranê, PDK Îraqê, YNK'ê û Partiya Demokrasiya Gel (Tirkiyê) pişkdar bûn ku her di vê kongirê de YNK'ê U Partiya Demokrasî ya Gel bi endamê zêrevan (çavdêr) di Rêxistina Entirnasyonala Sosyalîst de hatin hilbijartin.

## Biryarnameya Kongira 22'mîn a Entirnasyonala Sosyalîst derheq Îranê:

-Em daxwazê ji hemû hêzên alîgire Demokrasî û mafê mirovan di Îranê de dikin ku hewl û bizavên xwe ji bo guhertin û çêkirina (reforman) di Îranê de bidomînin.

-Binpê kirina eşkere û eyane mafê mirovan û azadiyên demokratîk ku ji aliyê neyarên demokrasî û guhertinan di Îranê de tê kirin, em bi tundî şermer dikin. Hejmarek ji wan kiryarên dîktatorane evane ne: Girêdana Rojnameyan, girtin û dest bi ser kirina rojnamevan, rewşenbîr û xwendevanên alîgirê pêkanîna guhertinan û dana hikmê îdamê, bi xasmanî li dar vekirina xebatkar û şoreşvanên Kurd.

- Em serkût û tepeser kirina Kurdan di Îranê de mehkûm dikin û ji bo çareser kirina pirsgirêka Kurdan li Îranê bi rêya atîxwazane û dan û standinan radiwestin.

-Em daxwazakarê azadia hemû girtiyên siyasî û baweriyê û ji nav birina her terze ferq û cudahî dananekê ne ku Jin li Îranê de bûne goriyên vê natebahiyê. Her wisan em daxwazkarê berçavgirtina wekheviya mafê Jin û Mêran di hemû warekê de ne.

Bo xwendina weşan û belavokên PDK Îranê û wergirtina zanyariyan derheqî hizbê, mêzeyî wan adresane li ser Înternêtê bikin:

www.kurdistanmedia.com
http://www.pdk-iran.org

**e- mail:**
info@kurdistanmedi.com

pdkiran@club-internet.fr

www.arsivakurd.org

agirî

Rojnameyeke siyasî û çandiye, Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne
Hejmara 1, Sermaweza 2003

Navnîşan:
AFK
B.P. 102- 75623 Paris
CEDEX 13 –FRANCE

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci.htm

Email:
**Rojnama_agiri@yahoo.com**

**Agiri2003@hotmail.com**

Fax: **0012703425105**

## Bo Agirî binivîsînin

Eger bo Agirî dinivîsin ji kerema xwe van xalên jêrîn berçav bigirin:

* Çi nivîsek bê nav û nîşan nayê weşandin. Nivîskar dikare navê dilxwaz bo nivîsa xwe hilbijêr e, Digel navê dilxwaz ji kerema xwe navê xwe yê rastî bo rojnamê bişînin.

* Eger nivîskar ji bo nivîsîn û berhev kirina mijara xwe ji çavkaniyan mifah wergirtibe, hewce ye îşare bi van jêderan biket.

* Ev nivîsên ku li zimanên biyanî hatibin wergêrandin, hewce ye îşare pê bê kirin û nav û nîşana jêderê jî bihê dest nîşan kirin.

* Hindî bikarin wêne, xerîte û belgenamên hewce tevî nivîsan bo me bişînin.

## Desteka nivîskarên Rojnameya Agirî mafê vê çendê heye ku:

- Destêwerdana rênûsa nivîsan biket.
- Wan mijar û babetên ku naverokek lawaz hebin belav neket.



## Cejna Remezanê pîroz be

Hejmara 1'e Agirî hev dem tevî hatina cejna pîroze Remezanê der diçe. Bi vê sedemê em pîrozbayiyê ji tev Misimlanên Kurdistan, Îran û cîhanê dikin cejnek xweş û şa bo wan bi hêvî dixwazin.

Em hêvîdar in ku ev cejne jî weke hemû cejn û boneyên olî û neteweyiye akinciyên Kurdistanê, bibe keys û derfetek bo ji hev nêzîk bûna zêdetire refên xelkê û xurttir bûna tebahî, biratî û canê bi hevre jiyan û alîkarî di navbera peyrewên oly û ayînên cur bi cure Kurdistan de.

---

# Sedsaliya ji dayik bûna Cigerxwîn pîroz be

**Sîtavk**


**Mamosta Cegerxwîn bi hevîna xwe re**

Eger em bixwazin vî helbestvan û zanayê mezin û nemire neteweya Kurd bi başî nas bikin û bizanin ku kê bû, çawa jiya û çi kir? Renge karê çend pirtûk û lêkolînên cuda cuda ên pispor û şahrezayên vî warî be û em nekarin di mijarekî kurt de aliyên cur bi cure jiyan û xasmaniyên vî hozanvanê mezin û navdare gelê xwe bidine naskirin. Ev jî şayîrek ku temenê tejî ji afirandine wî weke gul û kulîlkekê bû ku li nehatî û dêmistana bindestî û belengaziya Kurd û Kurdistanê de, bişkivîbû û mizgîniya bihara jiyanê û banga xebat bo gihîştin bi azadî û serbestiyê dida gelê Kurd.

Lê emê cehdê bikin vê mijarê de hinek ji xasmanî û afirandinên vî nemirî, ku wekî xizîneyeke tejî li durr û cewahirat û baxçeyeke tejî li gul û çîçeke, bêxîne ber çavê xwandevanên hêjaye Agirî.

Navê rastîne Cegerxwîn, **Şêx Mûs** bûye û di sala 1903'ê de li malbatek belengaze gundê **Hesar** ser bi bajarê Mardînê, li Bakûrê Kurdistanê hatiye dinê. Para zore temenê zarotiya vî bi şivanî û gavaniyê derbas bûye û tevî rêncberiyê kariye bi xwendina olî, îcazenameya meletî (îmam)yê wergire û bibe mela. Paşê dest ji meltiyê berdaye û ketiye nava jiyana cotkariyê û ji ber zordariya Axa û Began û ne wekheviya civakê çi xêr û xweşiyek nedîtiye û her tim li gund û bajarên Kurdistanê da koçber bûye û paşî tewaw bûna şerê yekeme cîhanî û parve kirina Kurdistanê ji aliyê dijminan ve, li **Amûdê** a Kurdistana Sûryê cîwar bûye. Ji ber ku di jîna xwe da gelek rojên dijwar li qewmîn û êxsîrî û derbideriye gelê Kurd û kawil bûn û parve kirina Kurdistanê bi çavê xwe dîtiye, dil û hinav lê şevitîne û bi navê **Cigerxwîn** weke şayîreke xemxur û dilsoj, bona kul u derdê Kurdan xebitiye. Evî bi helbestên xwe, rêya: zane bûn (xwendin), yekîtî û şoreşgeriyê nîşanî gel daye û xwendinê weke kilîla rizgarî û serbestî û melhema derman kirina birînên bindestiya Kurdan dişibîne û di bêje:

**Doma wê 13**

www.arsivakurd.org